Di Nêrîna Îslamê De

# Eql û Felsefe

Osman Nûrî TOPBAŞ

**Navê Resen:** İslam Nazarında Akıl ve Felsefe
**Nivîser:** Osman Nûrî Topbaş
**Wergêr:** Mehmet Seyhan
[Mela Mûhemmedê Bêrkevanî]
**Rastker:** Abdusselam Kartal
[Mela Ebdusselamê Bêcirmanî]
**Qordînator:** Muhammed Davuthan Kılıç
**Grafiker:** Cihangir Taşdemir
**ISBN:** 978-9944-83-836-8
**Navnîşan:** Ikitelli Organize Sanayi Bölgesi Mah.
Atatürk Bulvarı, Haseyad 1. Kısım
No: 60/3-C Başakşehir,
Istanbul, Turkey
**Tel:** (+90-212) 671-0700 pbx
**Fax:** (+90-212) 671-0748
**E-mail:** info@islamicpublishing.org
**Malpera We bê:** www.islamicpublishing.org
**Sertifika çapê:** Weşanên Erqem
**Language:** Kurdish

WEŞANÊN ERQEM

Di Nêrîna Îslamê De

# Eql û Felsefe

Osman Nûrî TOPBAŞ

WEŞANÊN ERQEM

**Di Qur'ana Pîroz de hatiye fermankirin:**

**"Ma ew li ser Qur'anê tefekkur nakin? Yan jî li ser qelbên wan, kilîd li ser kilîdan hene?"** [1]

**"Sûnd be ku me, di vê Qur'anê de ji bo însanan her cure mîsal eşkere kirine da ku ew şîret bigrin!"**[2]

**"Bi rastî me, di vê Qur'anê de ji bo însanan her cure mîsal jimartine û rûkirine. Lêbelê ji bo nîqaşê heyberê zehf dildar, însan e."** [3]

❁

**Di hedîsa şerîf de hatiye fermankirin:**

"*Eqilmend ew kes e ku hefsarê nefsa xwe dixe destê xwe, wê dikişîne hesabê û ji bo piştî mirinê kar dike. Ehmeq jî ew kes e ku digel hefsarê nefsa xwe ji hewesa xwe re berdaye jî (xêrê) ji Xuda hêvî dike.*" [4]

❁

---

1. Mûhemmed, 47/24.
2. Zumer, 39/27.
3. Kehf, 18/54.
4. Tirmizî, Qiyamet, 25/2459.

**Ebdûllah bin Mesûd** ferman dike:

*"Kî, îlm bixwaze bila maneyên Qur'anê tefekkur bike, bila xwe li ser tefsîr û qîraetê wê himbiz bike! Lewra îlmê pêşî û paşîyan têde mewcûd in."* [5]

❁

**Şe'bî** ferman dike:

*"Ez bi Xuda kim; heke hûn li dûv qiyasa eqlê ku ji wehyê re teslîm nebûye, herin, hûnê heramî helal û helalî jî heram bijimêrin."* [6]

❁

**Îbnû Sîrîn** ferman dike:

*"Pêşî Îblîs qiyas (a eqlê li derveyî wehyê) bikaranîye. Dîsa ew qiyas in [yên van eqlê ku ji wehyê re teslîm nebûne] ku însanan ji bo perestina roj û heyvê diajon."* [7]

❁

5. Heysemî, VII, 165; Beyheqî, Şûeb, II, 331.
6. Darimî, Mûqeddîme, 22/198.
7. Darimî, Mûqeddîme, 22/196.

**Hezretê Mewlana** ferman dike:

*“Birayê min! Divê tu, bi tefekkurê heyatê bibînî... Heke tefekkura te gul be [di mûhtewaya Qur’an û Sunnetê de be], tu ji bexçê gulê yî. Heke tefekkura te strî be [di mûhtewaya nefsanîyetê de be], tu qurmikê tifikê yî!”*

*“Ev can, heta di vê bedenê de be ez ji Qur’anê re her bende me, kole me; ez axa pêyê Mûhemmedê Mûxtar im... Heke yek ji van peyvên min, xebereke mûxalif biguhêze, neql bike, ez ji wî kesî jî bêzar im, ji wê peyvê jî...”*

# Pêşgotin

Hemd û senayên bêdawî ji Rebbê me re bin, ewê ku em ji tinebûnê anîne hebûnê, em kirine însan ku ew ji navbera heyberan tevan eşrefê mexlûqata ye û bi ew qeder nîmetên mûstesna lutf li me kirine ku em nikarin wan bijimêrin; di serê wan de jî nîmetên Îslam, îman û Qur'anê tên.

Selat û silavên bêdawî li ser hemû pêğemberên îzam bin! nexasim li ser Mezinê Fexrê Kaînatê, Nebîyê Axirzemanê Mezinê me Mûhemmed Mûstefa, alê wî û eshabê wî bin; ew pêğemberên ku bûne wesîla xilasbûna însanîyetê ji tarîtîyên bê-îmanî û cehaletê û gihiştina wan ji bo seadeta ebedî.

Cenabê Heq, însan wek yek ji delîlên qudret û ezameta xwe bi awayê sipehîtirîn aferandiye. Hinek jêhatin û melekeyên hêja yên wekî eql, qelb, îz'an û wijdanê dane însanî ji bo bi wan bikare heqîqeta ku 'dinya alema îmtîhanê ye', fehm bike û bigihîje seadeta ebedî. Ev meleke, "**lazim**" e heqîqetê bi tevahî

îdrak bikin, feqet li ser esasê hikmeta ku ew “**ne kafî ne**”, Xuda bi şandina pêğember û kitêban ji însanan re lutfa xwe gihandiye kemalê. Ji vê jî çêtir bi sebeb bêdawîbûna rehma xwe şandina pêğemberan bi însanê pêşî destpê kiriye ji bo hîç însanekî tenê jî ji lutfa wî mehrûm nemîne.

Ji bilî vê jî Cenabê Heq, emr û nehîyên îlahî yên xwe, ji ber ku ew hukmên amelî ne û heyata sosyal elaqedar dikin di paralel û dehma naverokeke ku însanîyetê di nav sedsal û zemanan de qeyd kiriye de hatine teblîğ kirine; di hemberî van de esasên îman û îtîqadê de jî tim û daîm di eynî mûhtewayê de teblîğ kirine..

Xuda Teala di nav van hemû teblîğatên îlahî de jî di nîhayetê de bi şandina **Qur’ana Kerîm** bi mûhtewayeke wisan mûkemmel û zengîn ku heta însan li ser dinyayê hebe, karibe çi îhtiyaca wî derkeve holê pêşwazî bike, lutfa xwe xetim kiriye. Ev lutf, tezahur û xuyahîyeke mûcîzewî ye, şanî dide ku merhemeta Cenabê Heq li ser evdên wî, dê heta qiyametê her berdewam bike.

Ellah Teala bilcumle di nav mexlûqatan de sade însan û cin ji bo îmtîhaneke îlahî xistine tabî û peyrew da ku derkeve holê; kî ji wan xêrê dike, kî ji wan jî şerrê dike. Bi vê sedemê ew bi meleke û taybetmendîyên wisan techîz kirine ku karibin hem xêrê bikin, hem jî karibin şerrê bikin. Wî mexlûqatên

dîgerên xwe jî bi keyfîyet û awayekî wisan aferandine ku karibin xizmetê ji van herdu cure mexlûqan re bikin da ku ew, wek naîl ji bo van heqîqetên îlahî îbadetên lazimîya van heqîqetan jî eda bikin, bînin cih.

Naxwe sebebê hebûna kaînatê dibe ev; ji bo însan û cin her yek ji wan bi qasî sewîya îdraka xwe, di bara hebûna Rebbê xwe, yekbûn û ulûhîyeta wî de bigihîje îmaneke kamil û bi îbadetan jî wî tekrîm û tazîm bike.

Bi vê arîkarîya îlahî sabit e ku ji bo bicih-hatina vê meqsedê jî şert e ku ev mezîyetên însan û cinan bi teblîğata pêğemberan werin teqwîyekirin û bi kemalê gihandin.

Çawa ku çav, ji bo karibe bibîne îhtiyaca wî bi bînahîyê heye; eql û qelb jî divê di tefekkurê de kûr bibin, heta ji heqîqetên îlahî re wasil bibin jî îhtiyaca wan heye ku bi nûra “**Qur’an**”ê û “**Sunnet**”ê rohnî bibin. Ji xwe Sunnet jî tetbîqata Qur’anê ya li ser heyatê ye. Lewra eqlê însan, bi awayekî wisan hatiye aferandin ku bikare bes li ber ronahîya Qur’an û Sunnetê bigihîje heqq û xêrê. Heke ew ufûqê tefekkurê yê ku Qur’an û Sunnetê vekirine nebûya, me nedikarî bi eqlê xwe tenê gellek heqîqetan hem fehm bike, hem jî wan îfade bike. Em ji helakbûna di delhîzên ku çendîn fîlozof ketine wan jî xilas nedibûn.

Tarîx şahid e ku ew kesên felsefên beşerî danîne û di plana dinyayê tenê de peymana hizûr û seadetê ji însanîyetê re dane, ne ew bi xwe karîne bigihîjin

vê hizûrê, ne jî şopîner û taqîbçîyên wan. Lewra di nîhayetê ew fîlozofê ku ew bi xwe jî însan e, îmkan û îhtîmal nîn e ku ew karibe heqîqeta hemû mewcûdatan ji Aferînerî bêhtir zanibe. Pêğember û ew zatên alim û arif ên ku li pey rêç û şopa wan çûne ku ew ji bo te'yîda [piştevanîya] îlahî bûne mezher, li herdu cîhanan jî receta gihiştina seadetê ji beşerîyetê re pêşkêş kirine, wan di piştî heyata fanîya xwe de jî jîyîna xwe di dilan de berdewam kiriye.

Însanîyet, hîç di ti dewr û zemanî de ji teblîğata îlahî û terbîya nebewî nehatiye mehrûmkirin. Li gorî rîwayetê, beşerîyetê bi îrşada sed û bîst û çar hezar pêğemberan heyata xwe dewam kiriye û dema dor hatiye axir-zemanê jî ew bi dînê dawîn Îslamê mûşerref bûye ku ew bi awayê sipehîtirîn bersiva îhtiyacan dide. Cenabê Heq, Îslam di heyata bîst û sê salan a nibiwweta Mezinê me Pêğember de peyapey gihandiye kemalê û bi vî awayî nîmeta xwe ya dîn li ser evdên xwe temam kiriye. Cenabê Heq, di piştî vê de eşkere kiriye ku ew ji evdên xwe re wek dîn bi Îslamê razî ye û ji bilî wê ewê ti dînekî dîtir ji mirovên ku rêyeke din bijardine qebûl neke.[1]

Îslam, ji bo dinyayê xwedî dîtin-nêrîna mûkemmeltirîn e. Ji bo mirov karibe sîstemekê ji bo dinyayê xwedî dîtin-nêrîneke kamil bijimêre, divê ew karibe ji bo her sûala ku were eqlê mirovî bersivê bide, divê

1. Li Maîde, 5/3; û Alî Îmran, 3/19-85'an binêrin.

ev bersiv jî di nav xwe de hevgirtî bin û aheng û teselsulekê şanî bidin. Ev sifet jî, bes di **dîtin-nêrîna Îslamê ji bo dinyayê** de mewcûd in.

Îslamê, menzûmeyeke qaîde û dîtin-nêrînan ji bo dinyayê teblîğ kiriye ku ew hemû qaîdeyên jîyanê dide ber xwe. Wê, ti sefheyeke [qunağeke] heyatê vala nehiştiye. Wê, mûnasebetên însanî bi însanên din re, bi kaînatê re û ji van tevan jî giringtir bi Aferînerê wî re bi qaîdeyên mûkemmeltirîn û bi hemû kitekite û teferruatan ve tenzîm kirine. Ew, bi vê wesfa xwe, ji bo bikaranîna aletekî teknîkî her wekî rêbernameyekê ye.

Digel wan dînên dîger ên semawî yên ku bi dest-têwerdanên beşerî xirab bûne, hemû dînên batil ên ku însanî bi destê xwe îcad kirine jî, bi taybetî jî dîtin-nêrînên ku fîlozofan ji bo dinyayê li holê danîne ji nuqsanî û tezadan [nakokîyan] tije ne.

**Xwendevanên giranbiha yên me!**

Îro, em di dinyayeke wisan de dijîn ku di netîca îstîlaya kulturîya global de xebat tê kirin ji bo însan mûfekkîreya xwe di çarçoveyeke materyalîst de hebs bike û bi sebeb telqînên bêmerhemet ên sîstema kapîtalîst îhtîrasên nefsanî ew lewitandine. Dîsa em bi kul û kovan mûşahede dikin ku di roja me de sîstem û ekolên dîtin-nêrînên beşerî yên ku mehsûlên eql in, hewl didin dîn û manewîyatê bixin bin zext û fişaran û wan ji hemû pêvajo û sefheyên heyatê derxînin.

**Cihûtî** û eqaîda wê ku bi desttêwerdanên cure-curên beşerî hatine tehrîfkirin[2] û mûhtewaya bi tenaqudan a tije ya krîstîyanîyê ku ji terefê însanan ve di konsîlan de hatine tenzîmkirin, li Rojava di netîca van de li hemberî van (herdu dînên mûherref) wek reaksîyonekê têgihiştina "eql derxistina pêş û dîn avêtina plana paş" derxistiye meydanê..

---

2. Destpêka van encûmenên ku bûne nimûneyeke eşkere ji bo şanî bide ka bi desttêwerdanên beşerî dînekî semawî çawa tê tehrîfkirin ev in:

Di **konsîla Îznîkê** de ku ew di sala 325'a mîladî de hatiye kirin de îlahtîya Hezretê Îsa; di **konsîla Îstanbûlê** ku ew di sala 381'ê de hatiye kirin de jî îlahtîya Rûhû'l-Qudûs (Rûhê Pîroz) hatiye qebûlkirin.

Di **konsîla Efesê** de ku ew di sala 431'ê de hatiye kirin de sifetê "Theotokos" yanî ewa ku reb anîye dinyayê dane Hezreta Meryemê; ji bo Hezretê Îsa jî du tabîetmendî (Diofîzît) hem însan, hem jî reb hatiye qebûlkirin. Di **konsîla Qadîkoyê** de jî ku ew di sala 451'ê de hatiye kirin de hatiye îlankirin ku Dêrên Rojhilatî (Qibtîyên Misrî, Ermenî, Suryanî û Hebeşî yên ku) dibêjin; di Hezretê Îsa de sifetê yek-tabîetî (Monofizit) yanî rebîtîyê heye, rêşaş in.

Di **Konsîla duyema Îznîkê** de ku ew di sala 787'an de hatiye kirin de qerar pê hatiye dayîn ku perestina îkonan ne guneh e. Haleveku berî vê bi du-sed salan nîqaş hatibû kirin; gelo perestina îkonan guneh e, yan jî ne guneh e? Heta çêbûye ku hinek caran îkon ji terefê împarator ve hatine qedeğekirin..

Krîstîyanên Ortodoks 7 konsîlên pêşî qebûl kirine, Krîstîyanên Katolîk jî ya paşîn ku ew di sala 1965'an de hatiye kirin bi tevahî 21 konsîlan qebûl dikin. Vatîkana Katolîk di vê konsîla dawîn de ji bo dîyaloga di navbera mezheb û dînên dîger de bang kiriye.

Mejîyên mûtefekkir, ên ku bersivên lê digerin di dînekî tehrîfkirî de nabînin, ğayet tabîî ye ku ew berê xwe bidin ser lêgerîneke din. Lêbelê ji ber ku pirranîya wan berî sed salan bi awayekî mûteessibane xwe li dijî Îslamê tije-kîn kirine, wan xwe ji vê îmkana ku berê xwe bidin ser Îslamê û bersivên ku lê digerin têde bibînin jî mehrûm kiriye. Bi vê sedemê, hijmara kesên ku bi destê xwe teessuba sed salan dane terefekî, li Îslamê meyzandine û gihiştina seadetê pirr hindik e.. Di zemanên dawîyê de bi sebeb zehfbûna wasîteyên guhastin û ji hev-agahdarbûnê bi saya vê, digel ku zêdehîyek tê dîtin jî lêbelê dîsa ev rewş hê negihaye nuqteya têrker û kafî. Naxwe divê mirov li hemberî ev qeder rewac-dîtina felsefê di Rojava de nekeve sosret û heyretê.

Digel vê jî Rojava, sirf ji ber giringî-pêdana bi rîayetkirina esasên lêgerîn û xebatê di meydana teknîk û ekonomîk de pêşketiye û li ser dinyayê gihaye mewqîyekî xurt û kartêker, ev bûye sersebeb ku di nav mislimanan de pêl bi pêl ev têgihiştina şaş belav dibe her wekî ku “ji bo pêşketina di medenîyetê de lazim be eql li pêşîya dîn were girtin”.. Ev heqîqeta ku di tarîxê de dema misliman bi sedaqet bi dînê xwe ve pêbend bûn de mûhteşemtirîn medenîyetên dinyayê damezirandine tê piştguh-kirin û xebat tê kirin ji bo ev fikrên çelexwehrî her wekî nexweşîyeke şewbê li welatên Îslamê di zêhnan de werin fetrîmkirin û teamandin.

Zehf lazim e ku misliman, bi taybetî jî mislimanên ku bi îlmên îslamî ve mijûl dibin li hemberî vê menzara tehlûkedar heta tu bibêjî bes, helwesteke baldar û ferasetmend şanî bidin.

Lewra sebebê esasî yê hewes-şanîdana ji bo felsefa Rojavayî bi awayekî layiq xeberdar-nebûna ji îhtîşama "**dîtin-nêrîna Îslamê ji bo dinyayê**" ye. Ev rewş, dişibihe halê mirovên ku taverojê nas nakin û ji bo şewqa lawaza mûm a ku lê rastên, heyran dimînin.

Ji bilî vê jî, ji ber ku di roja me de ev nîqaş jî tê kirin; gelo bila dersên felsefê di mûfredatê Fakulteyên Îlahîyatê de cih bigrin, yan jî cih negirin? Em di bara 'gelo divê cîhetê nêrîna Îslamê li "**eql û felsefê**" çi be' de ji derdorên xwe û telebên xwe ji bo sûalên curecur dibin mûxateb.

Li hemberî vê wezîyetê, çend heqîqetên ku me bi gellek wesîlan hewldaye bînin zimên, me pêwîst dît ku çendan bi awayê kitêbeke biçûka mûtewazî be jî em wan wek berhevkirî û bi ser hev de anî, ji we xwendevanên xwe re teqdîm bikin.

Di esnaya hazirkirina vê kitêba biçûk de di serî de me ji van berhemên ha: Kitêba bi navê *Îslam Dunya Goruşu* (*Dîtin-nêrîna Îslamê Ji Bo Dinyayê*) ya **Qadir Misirlioğlu**, *Bati Tefekkuru ve Îslam Tasavvufu* (*Hizirîna Rojavayî û Tesewwifa Îslamî*) ya **Nacîp Fazil**, *el-Munqizû Mined-Delal* (*Xilaskera Ji Rêşaşîyê*) ya **Îmam Ğezalî**, *Mektûbat* (*Nameyan*) ya

**Îmam Rebbanî** û eserên **Hezretê Bedîûzzeman** û kitêb û meqaleyên cuda cuda îstîfade kir..

**Cenabê Heq, me ji feyza dilî ya kitêba bilinda xwe mehrûm neke! Me ji pey rêç û şopa bi nûra pêğemberan û zatên alim û arifên ku di mewqîê weraseta wan de ne, veneqetîne! Ji bo me tevan bike nesîb ku em qedr û qîmetê Îslama ku tekane dînê heq e, bizanin, em bi awayê sipehîtirîn wê îdrak bikin û bijîn û bi vî awayî bikevin nav bendeyên wî yên ku ew ji wan razî ye!**

**Amîn!..**[3]

Osman Nûrî TOPBAŞ
Tîrmeha 2013
Uskudar/Îstanbûl

3. Di esnaya hazirkirina vê kitêbê de ez ji bo M. Akif Gûnayê ku emekê wî çêbûye teşekkur dikim û ji Rebbê xwe nîyaz dikim ku hewldanên wî bibin sedeqa carîye.

# Di Nêrîna Îslamê De Eql û Felsefe

Ev pirsên wiha; “di Îslamê de cihê felsefê çi ye? Gelo mirov dikare bi wî «eql»ê ku felsefe wî di gihiştina heqîqetê de giringtirîn wasîte dibîne, rê heta bi kuderê here? Gelo terazûya eqlî di wê qudretê de ye ku karibe hemû heqîqetan bikişîne? Gelo mirov dikare ji nuqteya ku eql têde bixitime û piştre çawa rêya xwe temam bike?” wekî ku di tarîxê de welê bû, îro jî ew zêhnan meşğûl dike.

Pêşî, divê em vê îfade bikin; felsefe, pala xwe dispêre eql. Îslam jî hem di tixûbê tabîîyê wî de pala xwe dispêre eql, hem jî pala xwe dispêre neqlê [Qur’an û Sunnetê]. Naxwe di navbera sîstemeke tefekkurê ku pala xwe dispêre wan heqîqetên ku Aferînerê me yê xwedî îlmê bêdawî teblîğ kirine û wê felsefa ku pala xwe dispêre eqlekî ku bi zafîyetên beşerî malûl e û hêza wî sînordar de, çendan ji hêla mijar û ğayê ve lihevçûn û mûşabehet hebe jî lêbelê

ji hêla metod, wasîte, tefekkur û hêza texeyyulê ve ferqên mezin mewcûd in..

Digel vê jî, ewa ku li alema îslamê bi tebîra belava "**Felsefa Îslamê**" tê îfadekirin, dîtin-nêrîna wan mûtefekkiran tê qesdkirin ku di nav tefekkura îslamê de gihane, yan jî di tefekkura xwe de giranîya xwe dane ser felsefê.[4] Carina jî bi tebîra felsefa Îslamê vegotina heqîqetên mûcerredên dînî, tê xwestin. Heke na ev tebîr, nayê wê maneyê ku Îslam ji bo felsefê mûsaid e.

Mesela Îslam jî -di endazeke diyar de- rasyonalîst e, yanî eqlparêz e. Îslam, qîmetekî mezin dide **eql**. Ew qeder qîmet pê dide heta ku wî, yek ji du şertên bingehînê mes'ûl qebûlbûna li cem Xuda, dijmêre. Yek ji van şertan, baliğ-bûn e, yanî gihana bilûğê ye; ya din jî biaqil-bûn e, yanî ew e ku melekeyên eqlê wî gihabin wê sewîyê ku karibe helal û heramî, guneh û sewabê û şaşî û rastîyê ji hev cuda bike, veqetîne. Bi vê sebebê zarok û dîn, di nezara Îslamê de ji kirinên xwe berpirs nayên jimartin.

Îslamê ev qeder ehemmîyet daye eql, ew bi her wesîlê mûmînan ji bo **tefekkur**-kirina heqîqetên heyat û kaînatê û hikmetên beyanên îlahî teşwîq dike. Ev jî bes bi "**eqlê selîm**"ê ku li ser hinek nelêtî û menfîtîyan nehatibe siwarkirin, dibe.

4. Li Qadir Misirlioğlu, *Îslam Dunya Goruşu*, rûp. 32-33, Weşanxaneya Sebîl, Îstanbul 2008'an binêrin.

Digel vê Îslam jî, bi eşkerehî beyan kiriye ku qabilîyeta fehmkirina eql ji bo heqîqetan ne bêsînor e. Lewra Cenabê Heq, ji bo ti ku aferandiyan şîyaneke bêtixûb lutf nekiriye.

Hemû taqetên ku mexlûqat wek lutfeke îlahî ji wan re xwedî ne, tixûbdar in. Eql jî ji bo xwediyê xwe di xusûsa gihiştina heqîqetê de dikare îmkaneke tixûbdar temîn bike. Ew heqîqetên ku heyat û kaînat wan di xwe de dihewînin jî bêtixûb in, eql ji bo (zanîna) daîreya vê selahîyetê têrê nake. Ev rastî jî şanî dide ku eql, ji bo bi maneyeke kamil têgihiştina wan heqîqetan "**lazim**" e, feqet "**têrê nake**". Bi vê sebebê alimên îslamê eql, wek "**eqlê naqis**" yan jî "**eqlê cuz'î**" îfade kirine.

Dîsa ji ber vê ye ku **îman** di netîca; **digel iqrara bi zimanî- ne bi eql- bi tesdîqa bi qelb**" tehqîq dibe. Ev esasê Îslamî jî şanî dide ku sade bi wasîta eql tenê gihiştina hedefa ku gihana wê tê xwestin, çênabe; lêbelê cihê ku ew têde xilas dibe, mirov dikare bi failîyeta qelbî ya ku ewê destpê bike, yanî bi "teslîmîyet" û "pêş qebûl"ê bigihîjîyê.

Lewra eqlê beşerî, çi qeder di sewîyekeke bilind de bibe bila bibe, heqîqetên ku mirov karibe bi wî bidestxîne, li hemberî zanînên ku Aferînerê me bi îlmê xwe yê bêdawî dizane, di mesbeya "**hîç**"-ekê de ye.

Wekî ku di ayetê de hatiye fermankrin:

**“... Îlmê Xuda, dor li her tiştî girtiye**...” [5]

Îlmê beşerî jî, heta ji tişta ku ewê sibê were serê wî bi xwe jî bêxeber e!..

Ji vê hêlê ve eql, heke di rasta beyanên îlahî yên ku Rebbê wî bi xwe ew aferandiye de were bikaranîn, ewê ğaya hebûna xwe bicih bîne.

5. E‘raf, 7/89.

# Dilopek Ji Okyanûsê

Ewê ku esereke hunerê anîbe wicûdê, ji bo hizr û hisên ku di şekl-dana wê eserê de bûne medar, hîç ti kesekî din bi qasî wî senetkarî ji wan waqif nabe. Eynî wekî vê, bi eqlê însanekî ku ew bi xwe jî mexlûq e, hem jî bi awayekî kamil waqifbûna ji temamê heqîqetên îlahî yên ku di hemû hebûn û bûyeran de veşartî ne, bê îmkan e. Lewra îlmê Aferînerî û îlmê aferîndeyî hîç wekihev nabin. (Zanîna beşerî li ber zanîna Xuda) bes li ber okyanûseke bêser û bêbinî di mesabeya dilopekê de ye.

Bi vê sedemê îdraka însanî; nikare bi maneyeke kamil Ellah Teala yê ku kaînat ji tinebûnê anîye hebûnê, fehm bike. Lewra rêya agahîyên beşerî; pênc hestpêker, eql û qelb e. Şîyana îdraka van hemû wasîteyan jî tixûbdar e.  Bi wasîteyên şîyan sînordar jî, bi awayekî temam fehmkirina hebûneke bilinda Baqîye, mûtleq, ezelî û ebedî bê îmkan e. Ew îdraka ku bi wasîteyên tixûbdar tehqîq bibe jî, ew bes dikare

di endazeke tixûbdar de bibe.. Yanî em bes dikarin ji okyanûsê bi qasî firağa xwe avê wergirin.

Ev hedîsa şerîf, vê heqîqetê çi xweş xulase dike:

*"(Di esnaya wê seyaheta ku Xizr hadîseyên acayîb, ğeraîb û hikmetên mechûl şanî Mûsa dayî de) Çûkekî beytik hat, li ser kenarekî gemîya ku ew lê siwar bûbûn danî. Piştre wî bi nikilê xwe ji deryayê av wergirt. Xizr ev menzara ji Mûsa re şanî da û ev teşbîh kir:*

*«-Li dev îlmê Xuda, îlmê min, yê te û yê hemû mexlûqatan, bes bi qasî vê avê ye ku vî çûkî bi nikilê xwe ji behrê wergirt.»"*[6]

6. Buxarî, Tefsîr, 18/2-4.

# Sirrên Îlahî Eql Dixin Heyretê

Ji ber ku gellek heqîqetên îlahî bi maneya kamil, bi eql nayên fehmkirin Îslam, “îmana bi ğeybê” ferman dike.

Yek ji delîlên bi qewettirînê vê heqîqetê, mûnaqeşe û îddîaya tarîxî ya di bara “**mahîyeta rûh**” de ye. Wekî ku tê zanîn fîlozofan, bi sed salan ğeyreteke mezin şanî daye ji bo di bara mahîyeta rûh de bigihîjin heqîqetê. Feqet di netîcê de qerar pê dane ku mahîyeta rûh wê neyê zanîn, bi hereket-kirin li ser reftar û bizavên tezahurên wî, mecbûr mane ku bi hebûna wî tenê îktîfa bikin.

Wek yek ji behsên felsefî jî bi sed salan li ser vê mijarê mûnaqeşe hatine kirin û di nîhayetê de wek ji felsefê cuda bi navê “îlmun-nefs” yanî “rûhanîyat”, yan jî bi vegotina roja me îlmê “psîkolojî”yê hatiye tesîskirin. Îro mijara vî îlmî, ne xebata ji bo fehmkirina mahîyeta rûh e. Fîlozofan piştî hebûna rûh bi awayekî “apriori” yanî bi “pêş qebûl”-ekê pejirand. Êdî xebata

xwe li ser hûrkolîna hadîseyên ku serkehnîya wan ew e, û lêkolînkirina mûnasebeta di navbera van hadîse û heyberên fîzîkî de hesr kirine.

Ev rewş, şanî dide ku fîlozof bi xwe jî mecbûr mane qebûl bikin ku selahîyeta eql, sînordar e. Îro êdî hîç ti fîlozofek bi hûrkolîna li ser mahîyeta rûh ne meşğûl e.. Karê ku psîkologan kiriye jî, sade ji lêgerîna sebeb û encamên hadîseyên bi rûh re elaqedar, îbaret e, her wekî ku ew bûye “îlmê laboratuwarê”. Haleve ku Qur’ana Kerîm, berî sed salan ev ferman kiriye û ragihandiye ku mahîyeta rûh wê neyê zanîn û di bara wî de zanîneke hindik ji bo însanî hatiye dayîn. [7]

Yanî Qur’an, daîmî li pêş diçe îlmê beşerî jî mecbûr dimîne wê tesdîq bike û li pey wê tê. Ev rewş jî şanî dide ku digel tesbîtên Qur’anê jî netîca hemû failîyetên hûrkolînên ku hatine tehqîqkirin bes qebûlkirina xusran û aczîyetê ye. Dîsa ev mîsaleke tîpîk e, şanî dide ku ji bilî gerîn û vegerîna ji bo teslîmbûna ji heqîqetên ku Qur’anê dane zanîn re ti çareyeke din nedîtine.

Eynî wekî vê, gihiştina heqîqetên bi mahîyeta zatê Xuda re elaqedar jî li derveyî taqeta eqlê însanî ye. Netîca failîyetên di vê xusûsê de jî ji xusraneke wekî wê pê ve nabe tiştekî din.

7. Li Îsra, 17/85’an binêrin.

Ji bo vê ye ku **Mezinê me Resûlê Xuda** di vê xusûsê de gotiye:

“*Li ser mexlûqên ku Xuda aferandine û li ser nîmetên wî tefekkur bikin, feqet li ser zatê wî nehizirin! Lewra hûn, hîç nikarin qedrê wî (bi awayekî layiqê wî) teqdîr bikin.*” [8]

**Hezretê Îbnû Erebî** jî gotiye:

“ *Wek bi (Zatê) Ellah Teala re elaqedar kîjan hizr were eqlê te bila were, zanibe ku Ellah Teala zehf ji wê bi wêdetir e.*”[9]

Naxwe îdrak-kirina Ellah Teala jî -eynî wekî ku di mijara rûh de jî wisa ye- bi hereket-kirina ji tecellîyatên sifetê wî însan mecbûr e ku wê bi “pêş qebûl”-ekê bi encam bike.

Yanî Îslam, di van mijarên wekî van de nakeve nîqaşan. Ji ber ku ew ji însanî re sirrên îlahî ne û hinek cîhetên wan hene ku ji eqlê wî dibûrin hem jî ew li ser me şert dike ku em ji hukmên îlahî re teslîmîyetê şanî bidin. Çawa ku kelîma “**Îslam**”ê jî ji koka “**se-li-me**” tê û ew teslîmbûna ji bo Xuda îfade dike. Lewra îman, qebûl-kirina hinek heqîqetên di ser eql re jî lazim dike ku terazûya eql nikare wan bikişîne.

8. Li Deylemî, II, 56; Heysemî, I, 81; Beyheqî, Şûeb, I, 136’an binêrin.
9. W. 638/1240.

Çawa di **Sûretê Kehf** de hatiye ragihandin[10] Mûsa ji bo îlmê ledunnî tehsîl bike diçe cem Xizr, dema ew bi tecellîyatên hinek sirrdar ên ji eql biwedetir re rûbirû hat, heyirî mabû. Lewra Cenabê Heq, Xizr dabû wezîfedar-kirin. Mûsa jî pêğemberekî mezin ê xwedî şerîet bûye. Feqet tiştên ku Hezretê Xizr kirin, di plana eql de bi zahirê xwe li dijî şerîetê dihate dîtin. Mûsa bi mûemmayeke dehşetdar re rûbirû bû. Dema wî hikmeta meselê bi eqlê xwe çareser nekiribû, îtîraz kiribû.

Xizr jî hê di serî de dema wî û Mûsa hevnas kiribû, jê re gotibû; hinek tişt hene ji ber ku tu rastîya wan fehm nakî, tu nikarî xwe li hemberî wan sebr bikî. Wî bi vê peyvên xwe, îşaret dikir ku di plana eql de mirov nikare ji hikmeta sirrên mayî waqif bibe, divê mirov di vê rê de bi perên teslîmîyetê mesafê wergire.

Çawa dema Xizr hikmeta çend hadîseyên bi sirr îzah kir, Mûsa bi yeqînî îdrak kir ku hinek heqîqet hene, eql ji bo fehmkirina wan têrê nake.

Buxarî jî bi vê qisseyê re elaqedar, di vê maneyê de hedîseke wiha heye:

“*Rehma Xuda, li Mûsa kurê Îmran bike! Heke wî bikarîya sebr bike, Xizr wê hê çendîn hadîseyên acayîb û ğeraîb li wî hîn bikirana*.” [11]

10. Li Kehf, 17/66-82’yan binêrin.
11. Buxarî, Enbîya, 27; Ehmed bin Henbel, V, 118.

Ha di Îslamê de bi teslîmîyet îmananîna bi wan heqîqetên ğeybî jî heye ku ji Xuda pê ve ti kes bi wan nizane, yan jî sade ew kesên ku wî xwestiye ew ji wan re bide zanîn, pê dizanin; lêbelê eql nikare wan biwezinîne.

Bi vê sedemê, lêgerîna li heqîqetê ku îcaba eqlê selîm e, ji bo mirov karibe bi awayekî layiq vê bîne cih, ev jî bes bi rambûna ji beyanên îlahî re mûmkin e.

Naxwe eqlparêzîya Îslamê, bi temamî ji dîtin-nêrîna fîlozofên **rasyonalîst** ên ku di lêgerîna heqîqetê de qudreta eql bêsînor qebûl dike û wî ji xwe re dike îlah, cuda ye. Lewra Îslam, nîzameke wisa realîst û rastîbîn e ku eql, di nav sînorên tabîî yên wî de dinirxîne.

# Terazîya Hessas...

Çawa qabilîyeta dîtina çavan û hêza bihistina guhan sînordar e, taqeta îdraka eql jî wisan sînordar e. Bêjimar mexlûqat hene, lê ji ber ku ji sînorê dîtina çavan bi wêdetir in, ew nayêne dîtin. Gellek deng hene ji ber ku li derveyî sewîya bihîstina guhan e, ew nayêne bihîstin. Wekî vê gellek heqîqet jî hene ji ber ku li derveyî hecmê îdraka eql in, ew nayêne têgihiştin. Eql, bi maneya kamil ji têgihiştina van heqîqetan aciz e.

Alimê mezin ê Îslamê **Îbnû Xeldûn** ê ku sosyolog û bavê felsefa tarîxê tê qebûlkirin di vê xusûsê de wiha dibêje:

"*Eql terazîyeke sağlem e. Lêbelê hûn nikarin pê meseleyên bi Xuda û axretê re elaqedar, heqîqetên pêğembertîyê û heqîqetên ji eql bi wêdetir bipîvin. Ev, wê ğeyreteke pûç be û ew dişibihe vê; kesek bibêje; «ew çi qeder hessas dikişîne!» û rabe çîya bi terazîya zêrkerî bikişîne. J**i sağlembûna terazîyê re tiştek nayê***

***gotin lêbelê, sînorekî hêza wê heye**. Bi heman awayî sînorekî «zanîn, dîtin, têgihiştina» eql jî heye, ew ji qeweta xwe bi wêdetir nikare gav bavêje*." [12]

Şair **Zîya Paşa** vê heqîqetê çi xweş îfade dike:

*Fêrkirina ulwîyatan ji vî eqlê biçûk re gerek nake,*

*Lewra ev terazî ev qeder giranîyê nakişîne.*

Yanî sînorekî dîyarkirî yê eql heye û ji wî paştir ya cinnet (dînbûn) e, yan jî dalalet (jirêderketin) e. Çi qeder mûkemmel dibe bila bibe cîhazekî ku hatibe îmalkirin ji bo bi volta 220'ê elektrîkê bixebite, heke tu rabî wî bi volta 2500'ê elektrîkê bidî xebatê, ew aletê mûkemmel, derhal wê înfîlaq bike.. Çawa ew felsefekarên ku selahîyeta eql bêsînor qebûl kirine jî, ya emrê xwe di nexweşxanên eql de, yan jî bi xwekuştinê temam kirine, ev jî ji bo vê heqîqetê îfadeyeke din e.

12. Îbnû Xeldûn, Mûqeddîme, rûp. 473.

# Mirov, Di Çarçîya Sefaletê De Li Seadetê Nagere!

Ew fîlozofên ku bi awayekî ji rêbertîya wehyê mehrûm, gotine; emê bigihîjin heqîqetê, lêbelê wan tim û daîm ew însanên ku karîne tesîrê li wan bikin, di şûna seadetê de ber bi sefaletê ve, di şûna heqîqetê de jî ber bi dalaletê ve ajotine, birine.

**Şehbenderzade Fîlîbelî Ehmed Hilmî** di esera xwe ya bi navê "***E'maqê Xeyal***" de hîkayekeke mecazî vedibêje, rêya wergerandina vê sefaletê bi seadetê, îşaret dike. Di vê hadîseya ku me bi kurtî guhastiye de (wiha ye:) **Recaî**, qehremanê vê hîkaya ku wek zebûnê felsefa materyalîst di nav buhranên rûhî de digevize û wilo li hizûr û seadetê digere, bi teqsîma (neğmeya) sazekê re, bi tesîra şiêrên mane-kûr ên ku **Aynali Baba** wan dixwîne, di E'maqa xeyalê de, yanî di kûrahîyên alema xeyalê de noq dibe û diçe.. Ew xwe li dîwanekê dibîne. Li wê derê ji pêğemberan bigre heta bi fîlozofan, ji şexsîyetên ulwî bigre heta

bigihe kesên suflî herkes heye. Bi navê “**beşerîyet**”ê yekî ku însanan temsîl dike jî bi dûv seadetê ketiye, bi îskeîsk digrî û wilo li çareyê digere. Feryad dike û wiha dibêje:

“-Ji min re bibêjin, rehmê li min bikin; ez hem ji heyatê nefret dikim, hem jî nikarim bê wê bikim. Çi dibe bibêjin, ji min re tarîf bikin; seadet çi ye?”

Hinek ji wan şexsîyetên li wir jî, ji cihên ku lê rûniştî ne, derhal radibin ser xwe û bersiva wê didin:

**Konfuçyus** dibêje: “-Seadet, komkirina hemû lezzetan di nav beroşek birinc de ye.”

**Eflatûn** dibêje: “-Daîmî hizirîna bilindahîya ye.”

**Aristo** dibêje: “-Mentiq e! Ha ji te re seadet!”

**Zerduşt** dibêje: “-Di tarîtîyê de neman e.”

**Brahma** dibêje: “-Ma seadet? Zena herkesî çi be, ew berevajîya wê ye!”

**Bûda** dibêje: “-Seadet, yek ji navên sipehî yên tinebûnê ye. Ew nîrvana ye, ey Beşerîyet, nîrvana (valahî) ye!”

Beşerîyet jî van peyvan dibihîze û zêhnê wê rind tevlîhev dibe, ji xwe re dibêje:

“-We nikariye feydê bide xwe bi xwe. We, emrê xwe bi mehrûmbûna ji seadetê bûrandiye. Di xeberdanên ku hûn dibêjin de jî ti esera seadetê nîn e! Ne

we seadet jîyaye, ne jî we seadet bi dûvketîyên xwe daye jîyandin.”

Piştre pêğember seadetê îzah dikin. Di dawîyê de jî îmam û xatemû’l-enbîya, **Mezinê Me Hezretê Mûhemmed Mûstefa**, ji Beşerîyetê re axaftinê dike û wiha dibêje:

“-Ey Beşerîyet! Seadet; wekî wê qebûlkirina heyat û wiqûatên wê ye, ji giranbarîyên wê re rizamendî û ji îslaha wê re jî ğeyret şanîdan e (yanî ji barên wê yên giran û jan û çîleyên wê re rizamendî şanîdan û ji bo îslahkirina wê jî ğeyret serfkirin e).”

Vêca Beşerîyet bersiva ku lê digerîya dît, rabû ser xwe û got:

“-Ey Fexrê Alem! Ey Rehma ji bo aleman! Ey Pêğemberê Mezin! Te, bi tenê derdê Beşerîyetê fehm kiriye û dermanê wê dîtiye!..” [13]

Maneya van îfadeyan, divê mirov bêîtîraz keyfîyetên ku netîca tayîna îlahî (yanî qadirê mûtleq) ne, qebûl bike û bi awayekî beyhûde ji bo guherandina van jî kar neke.

Ev, “**realîzm**”a dîtin-nêrîna Îslamê ji bo dinyayê, yanî rastîbînîya wê îfade dike. Hewldan ji bo guherandina tiştekî ku pala xwe dispêre tayînkirina îlahî,

13. Li E‘mak-î Hayal, rûp. 97-101, Weşanxaneya Sebîl, Îstanbul 1993; rûp, 106-111, Weşanên Akçağê, Ankara 2004’an binêrin.

ji ber ku ji binî ve hîç çênabe, naxwe ew bes ji bo vê bikêr tê ku mirov beşerîyetê bixe nav têkoşîneke heta tu bibêjî bes bi meşeqqet, lêbelê bênetîce û bi vî awayî wê bixe bêhizûrîyê.

# Dermanê Hizûrê; Riza û Ğeyret

Ev heyata fanîya ku em wê dijîn, li ser esasê hikmeta îmtîhana îlahî, carina ji bo tezahura tecellîyatên qehrê, carina jî ji bo tezahura tecellîyatên lutfê dibe dik û sahne. Marîfeta eslî ev e; em zanibin îradeya xwe di îstîqameta rizamendîya Cenabê Heq de bikar bînin û ji van hemû tecellîyatên qehr û lutfê jî biqezenc derkevin. Çawa Mezinê me Pêğember jî ev heqîqet wiha îzah kiriye, gotiye:

"*Rewşa mûmînî, bi rastî ji bo ğibte-kirin û heyran-mayînê hêja ye. Lewra her halekî wî ji bo wî wesîleya xêrekê ye. Xesleteke wiha, di mûmînî tenê de heye; heke mûmîn keyfxweş bibe, şukr bike; ev ji bo wî dibe xêr. Heke belayek were serê wî, sebr bike; ev jî ji bo wî dibe xêr.*" [14]

14. Muslim, Zuhd, 64.

Naxwe rewşa “**riza**”yê ku divê em li pêşberî teqdîra Aferînerê xwe şanî bidin, yekem şertê hizûr û seadeta beşerî ye.

Ya duduyan jî, digel giranbûna şertên ku dor li heyatê girtine jî bi dûvketina ğeyretê ji bo sererastkirina wan menfîtîyan e ku sererastkirina wan mûmkin dibe.

Ev jî şanî dide ku hinek xusûs hene di nav heyat û bûyeran de mijara îrada beşerî û ğeyretê jî teşkîl dikin (her wekî qedera mûalleq). Bûna însên di nav ğeyreteke wiha de di heman demê de îcabeke “**xwedî îrade**”-bûna wî ye.. Heke na, naxwe xwe girtina bi fikreke wiha ku ‘di jîyanê de hîç ti menfîtîyek nayê sererastkirin’, însên ber bi hêvîneman û reşbînîyê ve dibe û di netîca vê de jî wî ber bi atalet û tenbelîyê ve diajoyê. Yanî ew ataleteke wiha tîne meydanê ku ew ti îradeyekê şanî nede û hema bibêje; “ma ez çi bikim, qedera min ev bûye!”

Ev jî bi eşkerehî tê fehmkirin; dema li ber çavan were girtin ku însan ji hêla aferandînîya xwe ve bi mezîyetên hêja û şûm hatiye xemilandin hingê ev cure behane, dibe îştîğala bi abesê. Çawa ew tişta ku Rojavayî jê re “**fatalîzm**” dibêjin jî, bes fehmkirina nerasta wiha ji bo qederê y e.

Lewra di Îslamê de qismekî “**mûalleq**”ê qederê heye ku ew jî li gorî tezahurên îrada beşerî şekl werdigre. Hinek fiêl, di netîca xwestina însanî de tên xuliqa-

ndin. Heke na, îfadeya “xeyr û şerr ji Ellah Teala ne, yek ji esasên “**amentû**”yê ye, ne di wê maneyê de ye ku Ellah Teala bi awayê ku hîç naguhere her tişt tayîn kiriye. Ev îfade dike ku di her bûnê de îrada Xuda heye û bê zanîn û îrada wî hîç tiştek nayê wicûdê.

Heke di fiêlekê de pêşî îradeya/xwestina Xuda, bi îlawe li ser wê piştre jî failîyeta evdî were meydanê ev, “**qedera mûtleq**” e. Her wekî zayîn, mirin, nijad, dirêjî û kurtîya temenî... Ev keyfîyet bi ti awayan nayêne guhertin. Lêbelê ji ber van jî li axretê ji însanî re ti mûkafat û mûcazat nabe mijara peyvê. Waqîayên wekî van, li axretê di dîyarkirina miqdarê berpirsîya însanî de esasekî teşkîl dikin.

Digel vê jî Cenabê Heq, ji bo însan û cinan îradeyeke cuz’î ferman kiriye û di hinek xusûsan de ji wan re serbestîya hereketeke diyar nas kiriye. Ev rewş, tehqîqbûna tercîha evdî ya bi îzna Xuda, îfade dike û ji vê re jî “**qedera mûalleq**” tê gotin. Ji ber meydana mesû’lîyeteke wiha mewcûd e, Mezinê me Pêğember talîmat daye beşerîyetê da ku di heyatê de ji bo îslaha menfîtîyan hewl û ğeyretê bikin.

Em dikarin vê rewşê, bi vê nimûnê îzah bikin:

Heke bavek zarokê xwe bibe dikana leystok-firoşî û jê re bibêje;

“-Tu li vê dikanê kîjan leystokê biecibînî, rajîyê, tu di rahiştina wê de serbest î.” Lêbelê heke ew bi

şefqeta bavîtîyê pêşî leystokên bifeyde û yên bizirar jê re beyan bike û piştre wî serbest berde; heke zarok ji bo xwe leystokeke bizirar bibijêre, ku bav bixwaze dikare heqê wan nede û îrada wî bê netîce bike.. Heke ew bixwaze jî dikare wek îcaba soza xwe ya di despêkê de jê re bibêje;

"-Raje wê leystokê û bi wê zirara ku min tu jê şîyar kiribûyî re rûbirû bibe!"

Ev alem, wekî dikana leystokfiroşî ye ku me di vê mîsalê de zikr kir. Em jî dişibihin wî zarokî. Arîkarîya Ellah Teala ji me re jî ya bi şandina pêğember û kitêban -la teşbîh wela temsîl-[15] wekî îqaza wî bavê bişefqet e.

Ji ber ku îrada kullî di dest wî Cenabê Heq de ye, ew di fiêla evdî de bi sifetê "Xaliq" daxil dibe û wê diaferîne, ev xulqkirina wî dişibihe pere dana bavî ji bo tehqîqkirina arzûya zarokê xwe. Rewşa me li hemberî hinek bûyerên ku carina digel em tehqîqkirina wan arzû dikin û sebebên wan rîayet dikin jî dîsa ew tehqîq nabin, wekî vê ye.

Ev keyfîyet hemû, wekî ku me berê jî îzah kiribû, netîceyeke vê rastîyê ye ku însan û cin ji bo îmtîhanê hatine aferandin.

15. La teşbîh wela temsîl: Bila wekî teşbîhkirinê nebe.

Ji vê cîhetê ve wezîfa ku dikeve ser milê evdî; ew îrada xwe ji îrada Cenabê Heq re teslîm bike û hewl bide ku arzû û nîyetên xwe bi riza'ya îlahî te'lîf bike. Lewra wekî ku di ayeta pîroz de jî hatiye gotin:

**"… Digel ku ji we re bi xêrtir e jî mûmkin e, hûn ji tiştekî hez nekin. Digel ku ji we re xirabtir e jî mûmkin e hûn ji tiştekî hez bikin. Xuda dizane, hûn nizanin."** [16]

16. Beqere, 2/216.

# Eqlekî Biçûk-ê Wekî Eqlê Mîroyê

**Ehmed Hilmî Fîlîbelî** di esera xwe ya bi navê "***E'meqê Xeyal***" de di bara bêkîfayetî û têrê-nekirina eqlê beşerî de hîkayeteke din jî heye. Dîsa di vê hîkaya ku em bi kurtî diguhêzin de **Recaî**, diçe serdana **Aynali Baba** ku mideteke dirêj ew nedîtibû.

Aynali Baba, di piştî hesbe-haleke kurt de, wekî ku adetê wî bû qehwekekê jê re îkram dike, di neyê de pif dike. Dema Recaî li vê neyê guhdarî dike, dîsa xwe di kûrahîya alema xeyalê de noq dike, diçe û xewnekê dibîne. Ji xwe di esasê xwe de heyat jî ji cure xewnekê îbaret e.

Di xewna xwe de qaşo ew şehzadeyê yekî ji begê mîroyan bûye. Dema ew di serayê de li ber destê mûallimên xusûsî dihate perwerdekirin, rojekê dema seydayê mîroyî dersa coğrafyayê didayê beg ji bavê xwe îzn wergirt, ew ji bo derseke tetbîqî (kiryarî) ya coğrafyayê derxist nav zevîyan. Hewaya rojeke xweş taverojî hebû. Seyda jê re got; "-li vir ev çîya heye, li

wir jî ev çem heye…” bi vî awayî jê re îzahat dikirin, ji nişka ve asîman dike gurmegurm, lehîya baraneke tund radibe û destpê dike mîroyan dixe pêşîya xwe û wan li ber xwe dibe.

Di Recaî de hem îdraka însan hem jî îdraka mîroyan hebû, di wê anê de dema ew bi nêrîna însan dinêre ka çi dibe çi nabe, dibîne ku ew tişta mîro wê gurmegurma asîmanî zen dikin, du bergîrên westayî ne, li nêzîkî wan êm dixwin û hîre-hîra wan e, barana tund jî wekî ku wan lihevkirî, ji mîza wan a ku di eynî an û demê de dikin pê ve, ne tişteke din e..

Ew mîroyên ku karîbûne ji vê felaketê xilas bibin, bi seydayê xwe re vedigerin mektebê. Herkes di xusûsa îzahkirina hewayeke rojeke xweş taverojî ya wiha de gelo ev hadîse çawa çêbûye de mîro bi îdraka xwe îzaheke ğayet îlmî û mentiqî dike. Lêbelê ti elaqa yekî ji van jî bi heqîqetê re nîn e.

Ji ber Recaî karîbû bi nêrîna însan jî binêre, heke vebêje min ew ji ufûqeke ferehtir dîtiye, zane ku ti kes jê bawer nake. Bi vê sedemê dema ew bi sebr li van peyvên ku ti elaqa wan bi heqîqetê re nîn e, guhdarî dike, nagihan rewşa wan bergîrên westayî tê ber çavê wî. Ew bi qehqehe ji alema xeyala xwe ya ku zemanekî dirêj têde noq bûbû şîyar dibe. Dibîne ku wa ye Aynali Baba jî bi ken şiêrekê dimirmirîne, dibêje:

*Tav vedide, alem difetile,*
*Rojek tê tev dimevirin*
*Ey sahibê îlm û huner,*
*Tu zanî sebebê wî kî ye?..*[17]

Wekî ku vê hîkaya bi hikmet jî îfade kiriye, li ser esasê waqifbûna ji hukmê hemû heqîqetên bêdawî yên li kaînatê, ti ferqa eqlê beşerî jî ji wan mîroyan nîn e.. Hinek heqîqet hene, mirov bes dikare bi nûra Nibiwwetê û di rêbertîya wehyê de ji wan xeberdar bibe. Vêca eqlê însanekî ku ji nûra Nibiwwetê û rêbertîya wehyê mehrûm be, di xusûsa fehmkirina tecellîyatên qudret û ezameta îlahî ya ku li kaînatê tê şanîdan de ti ferqeke îdraka wî ji îdraka wan mîroyan nîn e.

Li vir divê em vê jî îfade bikin; "xewn" tezahureke rehm û îhsana Ellah Teala ya li ser beşerîyetê ne. Lewra xewn rêberek e, ji bo em bi zêhnê xwe bigihîjin heqîqetên metafîzîkî yên jîyanê. Lewra di xewnê de çendîn bûyer çêdibin ku çêbûna wan di heyatê de ne mûmkin e. Ev jî îmkanê ji me re dabîn dikin ku em hê bêhtir karibin rastbûna daxuyanîyên îslamê di bara ehwalên axretê de îdrak bikin.

Ji bilî pêğemberan û zatên salih ên ku li ser rêç û şopa wan diçin, hemû însanên ku dibêjin xebero, em rêya xilasîyê ji bo însanîyetê şanî didin û her yek ji me ji wan re rêberekî nimûneyî ye, bi taybetî jî ew

17. Li E'meq-ê Xeyal, Weşanxaneya Sebîl, rûp. 113-117; Weşanên Akçağê, rûp. 123-127'an binêrin.

fîlozofên ku radibin her tiştî bi eqlê xwe îzah dikin wekî ku di vê hîkaya mîroyê de jî wisa ye daîmî ew bêkîfayet in..

Pêğember ji ber pişta xwe dispêrin wehya îlahî, her yek ji wan wek rêberê hîdayetê hatiye û ew hev û din jî tesdîq dikin. Herçî fîlozof in, ji ber ku ew hem ji te'yîda (piştevanîya) îlahî mehrûm in, hem jî ji ber ku ew di bin otorîteya nefsa xwe de ne, û ew di bin terbîya manewî re derbas jî nebûne, ew bi eqlê bêkîfayet ê xwe tefekkur dikin, wan tim û daîm sîstemên hev û din pûç kiriye, tekzîba hev û din kiriye û emrê xwe zîyan kiriye..

Çawa **Paskal** jî piştî gellek ji emrê xwe di gerîneka felsefî de xilas kiriye, bêkîfayetîya eql fehm kiriye, berê xwe daye lêgerîneke mîstîk û wiha gotiye:

"*Felsefe tim dîtin-nêrînên îtîbarî, îzafî (subjektîf) li holê datîne. Mesela ew tiştê ku li vî terefê çîyayên Pîrene jê re heqîqet tê gotin, li terefê dî jê re xeta tê gotin. Ji wî zilamê ku li vî terefê wî çemê tixûb teşkîl dike, însan dikuje re «qatil» tê gotin, ji wî yê ku li terefê din însan dikuje re «qehreman» tê gotin.*"

## Piştî Mirov Ji Vapûrê Ma, Eql Ji Çi Re Bikêr Tê?

Mirov nikare bibêje; mehsûlên hizra felsefî bi temamî şaş in. Lewra fîlozof jî bi qasî îsabetkirina xwe mûşahede, mûhakeme û tefekkur-kirinên xwe di heyat û qaîdeyên wê de, dikarin bigihîjin hinek rastîyan.

Mesela matematîkzan û fîlozof **Descartes**[18] ê ku bavê felsefa modern û rasyonalîzê tê jimarin, bi hereket-kirina ji "delîla hebûnê" ku têde bi rêvebirina eqlî ya ku kirî gihaye vê netîcê, ew qebûlkirina wehya îlahî wek serkehnîya bingehîna heqîqetê bi zerûret îfade dike. Descartes, di esera xwe ya bi navê "*Hizrên Metafîzîkî*" de wiha dibêje:

"*Ellah heyberekî mûkemmel û ne nuqsan, şaşneber û şaşneker e. Li gorî vê, zanîna wî jî bê nuqsanî û rast e. Ellah ji ber ku mûkemmel e, şaş nabe. Li gorî ew şaş*

18. 1594-1650.

*nabe, zanîna wî jî rast e, li gorî ew şaş nake naxwe wî çi dabe zanîn ew jî rast e. Heke wî gotibe; min kaînat aferand, wî ew aferandiye, ev rast e. Naxwe serkehnîya zanîna qet'î, zanîna rastîna Ellah e.*"

**Paskal** jî di te'yîdkirina heman dîtin-nêrînê de wiha dibêje:

"*Di mewcûdîyeta me de dengek heye, ew ji kûrahîya me tê, ji me re dide zanîn ku em nemir in. Ev deng ê îrşada Ellah e ku di me de tecellî dibe.*"

Lêbelê fîlozofên wekî Descartes, Spînoza, Paskal û Kant û yên wekî wan jî ku gihane vê fikra qebûlkirina «hebûna Ellah» zerûreteke eqlî ye, esasê dînekî batil ê ku bi destê însan hatiye tehrîfkirin, nas kirine, wekî ku me berê jî îfade kiribû, bi sebeb "siwarbûna li menfîtî"yê, ji ber ku wan bi awayekî baş dînê heq Îslam nas nekirine, nekarîne van fikrê xwe bidin tekamul-kirin.. Çawa fîlozofên ku ji vî cure dînî re bi hurmet in, di bara şerefmendbûna wan bi "bawerîya tewhîdê" ya ku şertê pêşî û bingehînê seadeta herdu cîhana ye de jî qeyd negihaye roja me.

Evên ha, bi vegotina **Necîb Fazil**:

"*Tam dema ew ji îskela Îslamê nêzîk bûbûn, ji ber ku nekarîne gaveke tenê jî bavêjin ji vapûra dawîyê jî mane.*" teşbîh kirine. [19]

19. Necîb Fazil Kisakurek, "**Bati Tefekkuru ve Îslam Tasvvufu**" rûp. 51, Weşanên Buyuk Doğu, Îstanbul 2012.

Gelo ew eql û felsefeyeke ku piştî însanî heta bi ber pêpelinga xilasîya ebedî tînin û nikarin gav bavêjin hundur, ji çi îş û karî re bikêr tên?..

Dîsa ev tesbîta **Necîb Fazil** jî pirr manedar e:

"*Felsefe ew mûessese ye ku eql ew damezirandiye ji bo hukmranîya xwe şanî bide... Mûessese ya ser-erastkirina şaşîyê ye, ne ji bo dîtina rastîyê ye... Di felsefê de her mektebek dema şaşîya mekteba din şanî dide, rast dibêje.*" [20]

Naxwe dîtin-nêrîna felsefezanên dîndar jî, ji ber ku ji jehra înkara felsefezanên ateîst û materyalîst re di mahîyeta panjehrê de ye û wê pûç dike, ew bi temamî ne bêfeyde ye. Çawa di encama siwarbûna li menfîtîyê de ew dijberên dîn, ên ku ebedîyen eql û qelbên xwe li ber wan delîlên ku ji ayet û hedîsan têne anîn, girtine, malûm e ku felsefezanên dîndar karîne bi wan delîlên ku ji nava felsefê hatine anîn, wan bidin huşkirin.

Çawa **Hezretê Bedîûzzeman** îşaret dike, dibêje; ew mehsûlên tefekkura felsefî ya ku bi Qur'anê re ahengsaz bin, redkirina wan ne lazim e. Di vê nuqtê de divê mirov heq û batil ji hev û din veqetîne. Ew wiha dibêje:

20. Bati Tefekkuru ve Îslam Tasavvufu, rûp. 14.

"*... Ew felsefa ku em bi tundî şeqamê lê didin û êrîş dibin serê, ne felsefa mûtleq e; belkû ew beşa mûzir e. Lewra ew beşa felsefe û hikmeta ku xizmet ji bo heyata îctîmaî ya însanîyetê, exlaq, kemalata însanî û pêşketina hunerî kiriye, bi Qur'anê re haşt e. Belkû ew ji hikmeta Qur'anê re xizmetkar e, dijraberîya wê nake..*

*Beşa duyema felsefê jî, çawa ji bo ketina dalalet, îlhad û teqana tebîetê dibe wesîle, eynî wisan ew bi sefahet û lehwîyetê, însanî dixe ğeflet û dalaletê û ji ber ku ew bi xarîqeyên xwe yên her wekî sêhrê li xarîqeyên mûcîzekar ên Qur'anê dixe, eserên ku me nivîsandine, bi mîzan, xurt, bi mûwazeneyên xwe yên bi burhan xwe bi vê beşa ku ji rêya felsefê derketine ve digre û şeqaman li wan dixe.. Bi felsefa mûsteqîm û menfîetdar ve nabe...*" [21]

"*Heqîqetên bêrûh û vemirî yên felsefê; nikarin bi heqîqetên ronak û birûh ên Qur'anê re mûsademe bikin.*" [22]

Li terefê din, li gorî bawerîya Ehlê Sunnetê eql, sade ji bo îdrak-kirina hebûna Ellah kafî ye. Ji vê bi wêdetir eql, di fehmkirina sifetên zatî û sibûtî yên Ellah û bawerkirina ku ew tekane îlah e, ew mûteal e, yanî ew ji hemû sifetên nuqsanîyê mûnezzeh e, ew

21. Li Esa-yê Mûsa, rûp. 4, Çapxaneya Osman Yalçin, Îstanbul 1958'an binêrin.
22. Sozler, rûp. 351, Neşrîyata Enwar, Îstanbul 1995.

bi hemû sifetên kemalê mûttesif e, û mûkemmelîyeta wî ji îdrakê bi wêdetir e dîsa ew di xusûsa ku dîtina heqîqetên ku wî ji însanîyetê re teblîğ kirine de bêkîfayet tê qebûlkirin..

Çawa em hinek tiştan bi eqlê xwe îdrak dikin; lêbelê em wan bi endamên hestpêker ên xwe fehm nakin, eynî wisan em nikarin hinek tiştan bi eqlê xwe îdrak bikin; lêbelê em dikarin bi wasîteya teblîğa pêğemberan wan îdrak bikin.

Di xusûsa mîsala vê de **Hezretê Îmamê Rebbanî** wiha dibêje:

"*Eql qebûl dike ku divê em ji bo nîmet-bexşê xwe şukr bikin; lêbelê bes pêğember li me hîn dikin ka emê vî şukrî çawa eda bikin... Îfadeyên hurmet û şukrê yên ku ji cem Heq nehatibin hînkirin, li cem Heq ne derbasdar in. Gellek caran însan hinek peyvan, bi meqseda mezinkirin û bilindkirina Ellah, serf dike; lêbelê bi van, tu ji mezin û bilindkirina Xuda behs neke, belkû tu wî nizm dikî. Naxwe tekane wehî ye, rêya ku em hîn bibin ka emê çawa ji Xuda re şukr bikin.*" [23]

Naxwe eql, bi awayekî mûtleq îhtiyaca wî bi arîkarîya wehyê heye. Heke ev arîkarîya îlahî nebe, îdraka însanî nagihe kemalê û ji kişkişîna bi ber tezadan ve û ji ketina rêya şaş xilas nabe.

23. Mektûbat, c. III, 23. Mektûb.

Naxwe bila ew fîlozofên ateîst û materyaslîst ên ku înkara dîn dikin li terefekî bin, divê mirov heqîqetên îslamê ji bo fikrê felsefezanên ku ehemmîyetê didin dîn bikin mîzan, bi vî awayî rastî wê ji şaşîyan were veqetandin.

Li ser vî esasî, felsefeyeke ku xureka xwe ji “dînê heq” nagire, nikare heqîqetê bi însan bide naskirin. Bes dînê heq, dikare bawerîyên mûtleq û ebedî yên ne îzafî û demî li holê deyne. Lewra pêğember ji hewa û hewesa xwe napeyivin; ew “**talîmatên Ellah Teala**” didin zanîn. Fîlozof jî dibêjin; “**bi dîtina min wiha ye**.” Bi vî awayî ew hukmê şexsî û îzafî didin.

## Pêwîstî Bi Qistasa Fiêlî

Di esasê xwe de însan hîç nikare di dirêjahîya tarîxa însanîyetê de civakekê şanî bide ku têde dîtinnêrîna ti fîlozofekî li ser heyatê hatibe tetbîqkirin û ew pê gihabe seadet û selametîyê.. Ew fikrên ku wan derxistine pêş, ji wan teorî û nezarîyên rijî û ziwa îbaret mane ku jîyîna wan ne mûmkin e û bi umûmîyet hizrên wan di nav rûpelên kitêban de, di refên toz-girtî yên kitêbxana de hatine hebskirin û mehkûm mane. Hinek ji wan teorîyan jî dema hewl û xebat hatiye kirin da ku wan ji bo heyatê bidin întîqalkirin, ew bes ji vê re bikêr hatine ku sererdê bi xwîn û hêstirên çavan bidin avdan û piştî muddeteke kurt jî ew di kewaşegeha tarîxê de hatine avêtin û terkkirin..

Mesela **Aristo**, digel ku wî bingeha hinek qanûn û qaîdeyên felsefa exlaqî avêtiye jî, lêbelê em nikarin kesekî tenê jî bibin ku bawerîya xwe bi felsefa wî anîbe, ew di heyata xwe de tetbîq kiribe û pê gihabe seadetê.

Utopya'ya **Eflatûn** a bi navê "*Cûmhûrîyet*"ê jî ji tesewwira dewleteke xeyalî bi wêdetir neçûye, derbas nebûye.

Dîsa **Farabî,** digel ku ew li alema îslamê gihaye, wî giranîya xwe daye ser felsefê, teorîya xwe "**bajarê sipehî û civaka îdeal**" di xeyala xwe zindî kiriye û fikrên xwe di bara wê tesewwira xwe de jî di mûhîmtirîn esera xwe ya bi navê "**el-Medînetû'l-Fadîle: Bajarê Fezîletan**" de nivîsandine.. Lêbelê ji ber ew teorî, ne heqîqetên wisan e ku hatine jîyandin û wilo nivîsandin, piştî qelem li wan hatiye kişandin jî dîsa ew nebûne xwedî wan taybetmendîyan ku jîyîna wan mûmkin bibe.

Li Rojava tîpîktirîn mîsala vê teorîyê **Nietzsche** (Niçe) ye ku wî "**super human**"-ek, yanî tesewwira însanê îdeal çêkiriye. Lêbelê ew mezîyetên ku wî ji bo însanekî wiha teswîr kiribûn, ji nezarîye û teorîyeke wisan îbaret e ku ew hem ji nimûneya îmtîsalê, yanî ji şexsîyetên wisan ku ew nimûne wergirtin, hem jî ji îmkanên ku ew di heyatê de werin tetbîqkirin, mehrûm maye.

Haleveku Îslam, sîstemeke îdeal e, ew hem xwedî qistasên fiêlî yên wekî heyata nimûneyî ya pêğemberan e, hem jî ew xwedî endazên mûşexxes e, ji bo mûkemmelîyeta reftar û bizavan. Wesfên wekî Heq-batil, rast-şaş, sipehî-mekroh, her yek ji wan her wekî etîkêtekî ye. Hûn di bara kîjan helwestê de

bixwazin, dikarin van bikar bînin. Feqet ev etîkêt jî heta bi mîsalên amelî/fiêlî neyên destek-kirin, egera (îhtîmala) bikaranîna wan di bara tewr û helwestên şaş de her wext û anê baqî dimîne.

Haleveku Ellah Teala, Mezinê me Pêğember ji “**zarokîtîya sêwî**” ku di nav civakekê de takeksa (ferdê) bêçaretirîn e, heta ber bi merteba bilindtirîna wekî “**reîstîya dewletê**” û “**nebîtîyê**” bilind kiriye ku di bara her cure tezahureke heyatê de mûkemmeltirîn reftar û bizav ji wî sadir dibin. Ellah Teala her biza-veke wî jî ji bo beşerîyetê kiriye qistaseke (pîvaneke) fiêlî, yanî ew ji bo bizavan kiriye endaz û ji bo heyatê jî kiriye destûr.

Cenabê Heq, Qur’ana Pîroz jî ne di aneke tenê de, yan jî ne di demeke kurt de, lêbelê ew di nav 23 salên heyata nibuwweta Resûlê dilovan de peyapey înzal kiriye, anîye xwarê. Her ayeteke ehkama ku hatiye xwarê, pêşî ew ji terefê “**uswe’yê hesene**” yanî ji terefê şexsîyeta nimûneyî ya bêhemta Mezinê me Pêğember ve hatiye tetbîqkirin, ew ji bo ummetê bi awayekî zindî hatiye şerh û îzahkirin.

Wekî Qur’ana Pîroz, ev nimûneyên mûkemmel di reftar û bizavên Mezinê me Pêğember de jî, li ser esasê ku her yek ji wan endazeke nêreber (mûşexxes) e, ew hatine parastin. Ev jî ji bo hemû reftar û bizavan wek mîsalên amelî ji ummetê re hatine lutfkirin. Ji ber ku qistasên fiêlî yên wiha yên Nietzsche (Niçe)

nîn in, “**super human**” ê wî mehkûm bûye ku wek nezarîyeke utopîk bimîne. Hîç ti sîstemeke exlaqî ya ku mehsûla eqlê beşerî be jî wekî Îslamê ne xwedî qistaseke fiêlî ya mûkemmel e.

Her dewr û zemanê ku pêğember û zatên alim û arifên dostên Heq yên ku li pey rêç û şopa wan diçin, nimûne hatibin girtin û heqîqetên ku wan teblîğ û telqîn kirine di heyatê de hatibin tetbîqkirin, civak gihane hizûr û seadetê. Lewra Ellah Teala, ji bo mûkemmelbûna hemû reftar û bizavên beşerî yên wî, Hezretê Pêğember ji bo me wek nimûneya îmtîsalê şanî dide. Di ayeta pîroz de hatiye gotin:

“**Sûnd be ku ji nav we, ji bo yên** (mûmînên) **ku çavpêketina Xuda û roja axretê hêvî dikin û Xuda zehf zikr dikin, di Resûlûllah de uswe’yeke hesene** (mûkemmeltirîn nimûneya ku hêja ye mirov wê ji xwe re bike mînak) **heye**.” [24]

Çawa ew însanên ku bi sebeb dijwarbûna xwe di cehalet û zulmê de -heke tabîr caiz be- ji sewîya însanîyetê ketibûne binê okyanûsa Hindê, wan bi qasî par-wergirtina xwe ji teblîğ û îrşada Resûlê Xuda, para xwe ji hal û hereketên nimûneyî yên wî jî wergirtine; di însanîyet, fezîlet, exlaq, merhemet, şefqet, heq û edaletê de bûne zirwe..

24. Ehzab, 33/21.

Ev peyva **Şîhabûddîn Qerafî** (w. 684), ku yek ji mûhîmtirîn sîmayên hiqûqê Îslamê ye, ji bo vê heqîqetê mîsaleke mûşexxes e:

“*Heke ti mûcîzeyeke dîtira Resûlûllah nebûya, bes ew eshabê kîram ê ku wî perwerdekiribûn ji bo îsbata pêğembertîya wî kafî dihatin.*”

Lewra ew civak, di netîca terbîya nebewî ya ku jê re bûbû mezher de ji tarîtîya şirkê û wehşeta (hovîtîya) cahîyetê xilas bûbû û ew bûbûn şexsîyetên wisan stêr ku li asîmanê fezîleta însanîyetê diberiqandin. Ew nifşên mûmînên ku li pey wan çûne jî medenîyeteke mûhteşema Îslamê damezirandine ku însanîyet heta bi vêga jî her bi ğibte li wan temaşe dike.

Mûtefekkir û tarîxzanê Fransiz **Lamartin**, ji mûweffeqîyeta Resûlûllah di doza wî de hereket dike û xwedî-bûna wî ji bo dehayeke mûazzem jî wiha îfade dike, dibêje:

“*Heke mezinbûna emancê, biçûkbûna wasîteyan, ezameta encamê, sê pîvanên dahîtîya însanî bin; kî dikare biwêre, mezintirîn şexsîyetên tarîxa modern bi Hezretê Mûhemmed re qiyas bike?*

*Meşhûrtirînê wan şexsîyetan bes karîne ordîyan damezirînin, qanûnan derînin, împeratorîyan biçespînin. Feqet di netîcê de gellek caran karîne hêzên maddî bînin meydanê ku hê li ber çavên wan,*

*hem jî berî ew bi xwe ji navê biçin, ew hêzên ku anîne holê ji navê çûne.*

*Haleveku Wî, sade ne ordî, sîstemên hiqûqî, împeratorî, qewm û xanedan, lêbelê wî, bi mîlyonan însanên li ser sêyeka dinyayê jî xistine bizavê.*" [25]

Dîsa nivîserê Îngilîzî **Thomas Carlyle** (Tomas Karlîl) wiha gotiye:

"*Hîç ti împeratorekî ku tac danîbe ser serê xwe, bi qasî Hezretê Mûhemmed ê ku cilên xwe bi destê xwe pîne kirine, hezkirin û hurmet nedîtiye.*"

Lewra Mezinê me Fexrê Kaînatê, ji hewa û hewesa xwe napeyive, wî ji însanîyetê re tercumantîya wehyê dikir. Ji bo vê, ew ji te'yîda (desteka) îlahî re bûbû mezher.

Di piştî Esrê Seadetê de bêşiwar yek ji wan dewletên ku bi awayê ronaktirîn Îslam di heyata civakê de hatiye tetbîqkirin **Osmanî** ye. Ecdadê me Osmanîyan bi sedaqeteke mezin, îxlas û mehebbet li pey rêç û şopa Mezinê me Pêğember çûne û gihane sewîya medenîyeteke mûhteşem.

Çawa nivîserê utopya'ya Rojavayî, fîlozofê Îtalî **Tomasso Campanella** di esera xwe ya bi navê "**Dewleta Taverojê**" de îhtîşama sewîya kalên me Osmanîyan di medenîyetê de serkehnîya sirûşa wî

25. A. De Lamartine, L'histore de la Turquie.

teşkîl kiriye. Ev bûyer nimûneyek ji mîsalên bêjimar e, vê heqîqetê şanî dide ku însan, ne bi felsefeyên beşerî yên ku tetbîqkirina wan ne mûmkin e, lêbelê ewê bi Îslama ku dînê heyatê ye, bigihîje hizûrê.

# Heke Eql Kafî Bûye...

Ellah Teala, evdên xwe aferandine û bêşiwar ew ji wan bi xwe jî bêhtir bi taybetmendîyên wan dizane. Ji ber ku eql, di gihiştina heqîqetê de zaîf û bêkîfayet e, ji bo telafîkirina zeîftî û bêkîfayetîya eql jî wî di dirêjahîya tarîxa însanîyetê de -li gorî rîwayetê- 124 hezar pêğember şandine û bi sihûf û kitêbên ku bi rêya wehyê ji wan re şandine jî arîkarîyeke mezin kiriye da ku însan bigihîje heqîqetê.. Ev keyfîyet jî, şanî dide ku eql bi tena serê xwe di gihiştina heqq û xêrê de yanî di gihiştina rastî û heqîqetê de ne kafî ye. Heke eql di vê xusûsê de wasîteyeke kafî bûya, Cenabê Heq, ev qeder pêğember û kitêb ji însanîyetê re nedişandin.

Li terefê din, şertên heyatê çi dibin bila bibin, însanîyet hemû li hemberî heqîqeta “**mirin**”ê di nav lerzeke hevbeş de ye. Windabûna rêyên heyatê di fetl û vegerên ufûqa mirinê de, dilan ji kûrahîya wan ve, diêşîne.

Ew mechûlên di bara “**mirin**” û “**piştî wê**” de ku her wekî marekî jehrdar xwe di zêhnan de li hev fetilandiye û kengê xwe tevdide jî însanî têdergîn û reht dike, ji terefê însanên ku ji îrşada wehy û pêğemberan dûr mane ve-, di her dewr û zemanî de xwestine bi her cure telaqqîyên batil wê bidin huşkirin, bidin jibîrkirin, bi serde bigrin, yan jî wê di bin hişan de bidin hebskirin.. Ha ev koregirêka paşerojê ku ne mûmkin e, beşer wê bi hizra xwe fehm bike, bes dengê wehyê dikare wê veke.

**Qur’ana Pîroz** tekane kitêba îlahî ye ku mechûlên vê rêwîtîya heyata fanî malûm dike, mûammayên wê digihîne çareserîyê, tarîtîyên wê rohnî dike û ji her hêlê ve ji bo eql û qelb delîlên tetmînkar di nav xwe de dihewîne.

Rebbê Mezin û Bilindê me, di gellek ayetên pîroz de bang li me dike ji bo em hikmetên di aferandina însanî de, nîzama xarîqûladeya di kaînatê de û bûna Qur’ana Pîroz wek mûcîzeyeke beyanê, bihizirin. Însanên ku dixwazin bi awayekî layiqê heysîyeta însanîyetê bijîn, mecbûr in, bikevin dinyaya vê tefekkura ku Qur’ana Pîroz îstîqamet jê re danîye.

Tuxmê çinarê yê wekî zerreyekê bi wasîta axeke mûnbit û bikêrhatî dibe dareke nehîtî û îhtîşameke mûazzam qezenc dike. Tefekkur, texeyyul û hissîyatên me jî di netîca xurek-wergirtina wan ji Qur’anê û pê xurtbûna wan de digihîjin hestên qelbî û heqîqetên

bêdawî û mûhteşem. Li ser vî esasî, heke feyza xilasneber û bênîhayeta Qur'anê û îrşada bilinda wê nebûna, tefekkur û hestên me jî wekî tuxmekî ziwa ji axa mûnbit û bikêrhatî mehrûm diman.

Naxwe ji bo me jî nîmeteke 'ji îdrak-kirina ezamet û bilindahîya îkrama îlahî ya ku bi saya Qur'ana Pîroz tehqîq dibe', mezintir nîn e.

Bi rastî civak, bi fikrê qaşo zanayên ku xwe diavêjin ser kitêbên felsefê, wan kitêbên devgirtek reş ên ku di refên tozgirtî yên kitêbxanan de şemirandî mane, nagihîjin selametîyê. **Qur'ana Pîroz** û şerha zindîya wê **Sunnet** însanîyetê ji bêhizûrîyê derdixin û digihînin seadet û selametîyê; piştre jî teblîğ, îqaz û îrşada wan mûmînên ku bi kultura **Kitab** û **Sunnet**ê hatine strandin û bi hikmet û heqîqetên îlahî gihane kemalê, însanîyetê digihînin selamet û dilşadîyê.

Eqlê ku di rêberîya beyanatên îlahî de terbîye nebûbe, her wekî hespekî har û şemûs e. Çawa bi wî re gihiştina hedefê ne mûmkin e, eynî wisan di kendalan de lihev-totlanî bûn û helak bûn jî mûheqqeq û mûqedder e. Ji ber vê, çawa ji bo mirov karibe bi awayê sipehîtirîn ji enerjîya hespekî wehşî îstîfade bike, lazim e ku mirov liğabê li devê wî bixe, hefsarê wî bixe destê xwe û wî kedî bike, eynî wisan pirr zerûrî ye ku mirov **eql** jî bixe bin terbîye û perwerdeya manewîya wehya Kitabê û Sunnetê ku ew bi xwe jî îzahata wê ye û wî bixe rewşa ku ew bibe "**eqlê selîm**"..

Ekolên felsefî, îddîa dikin ku ew -bêyî îrşada pêğemberên ku ji te'yîda (piştevanîya) îlahî re bûne mezher jî- heqîqetê fehm dikin. Lêbelê heqîqetên mezintirîn, bê wasîteya mûstesnatirîn evdên Xuda, yên ku wî bi pêğembertîyê lutf li wan kiriye, nayêne hînkirin.

**Hezretê Mewlana** vê heqîqetê wiha îfade dike:

"*Eqlê zarokî jî dibêje; «bi kitêbê ve meşğûl bibe!» Feqet ne mûmkin e zarok xwe bi xwe tiştekî ji kitêbê hîn bibe. Eqlê nexweşî jî wî dikişîne û dibe cem doktorî. Lêbelê eqlê wî ji xwe re nabe derman. Heke her qirika qul rêya xwe ber bi fedl û kerema Xuda ve dîtibûya, ma Cenabê Heq ev qeder pêğember dişandin?*"

Pêğember ji bo hemû însanîyetê mezintirîn ajar û nîmeta Xuda ne. Heta hinek ji wî îlmê mûhteşemê cuz'î yê ku pêğemberan bêyî ti hembereke dinyewî di bara zat û sifetên Xuda de dane jî, însan nikarin wan bi rêya ramanên felsefî, lêgerîn, lêkolîn, mûşahede û paqijkirina nefsî ya hezar salan, bidest bixin.

**Hezretê Îmamê Rebbanî** di vê mijarê de wiha dibêje:

"*Pêğember ji bo aleman rehm in. Ellah Teala, bi navgîna van însanên mezin û pak ji bo mirovên wekî me xwediyê eqlê cuz'î, Zatê xwe û Sifetên xwe ji me re dane zanîn û bi qasî dereca têgihiştina me, em ji*

*bilindahîyên xasê Zat û Sifetên xwe agahdar kirine. Dîsa Wî bi wasîta pêğemberan ji me re daye zanîn ka ew ji çi razî ye û ew ji çi jî ne razî ye û Wî ew derfet ji me re bexş kirine ku em pê bikarin menfîetên xwe yên dinyewî û uxrewî ji zirarên xwe veqetînin. Heke pêğember nebûna, eqlê beşerî, nedikarîbû (bi awayekî kamil) hebûna Xuda îdrak bike, ne jî dikarîbû bilindahî û mezinatîya wî fehm bike.*" [26]

Li gorî mirov nikare îddîa bike ku di kîjan nuqtê de taqet û selahîyeta (bikêrhatinîya) eql xilas bibe li wê nuqtê heqîqet jî digihin nîhayetê, naxwe mirov nikare ji wê nuqtê û pê de wê temayula ku ber bi bêdawîtîyê ve teselsul dike, diçe ji bo gihiştina rastîyan jî berteref bike.. Lewra ev îhtiyaceke fitrî ye. Ji ber vê ye ku gerek tefekkura dînî, gerek jî tefekkura derveyî dînî jî ji vê beşa rastîyan re bêelaqe nemane. Ji her kesî re malûm e ku ramanên felsefî di bara meselên Metafîzîkî de kullîyateke mûazzam pêktînin.

Wekî ku me berê jî îfade kiribû, ji ber ku pêğemberan feyza xwe ji serkehnîya îlahî wergirtiye, wan tim û daîm hev û din te'yîd kiriye. Lêbelê fîlozofên ku eql ji xwe re esas girtine, hîç ji nakokîyan xilas nebûne. Her fîlozofê ku derketiye holê bi redkirin û tenkîdkirina fîlozofên berî xwe dest bi karê xwe kiriye. Heke di vê reftara wan de ji bo hesta ezperestî û îddîaya nefsanî ya bûna di plana pêşî de roleke

26. Mektûbat, c. III, 23. Mektûb.

mezin hebe jî, sebebê eslî taybetmendîya eqlî ye ku ew ji tenaqud û nakokîyan salim nabe.

Bi rastî ew malûmatên ku eql wan li holê datîne; hîç ti zemanekî ew bi awayekî tam ji tehlûka şubhe, tereddud, xeta, nuqsanî, jibîrkirin û şaşbûnê paqijkirî nebûne. Lewra eql, kêm yan jî zêde emma bi awayekî bivê-nevê her di bin tesîra qenaet, fikrên ku bûne qalib û telqînên mûsbet û menfî yên ku ji derdorên derve tên, de dimîne. Ew bi temamî ji zaîftîyên wekî hêrs, çikûsî û hewesan; û ji kêmasîyên wekî jibîrkirin, pûnijîna di fikran de û xetayan xilas nabe. Gellek hukmên ku ew gihaye wan jî, bi van rengên derveyî hatine boyaxkirin û wek tevlîbûyî derdikevin holê. Wate (yanî) eql, di gihiştina zanînê de, ne serkehnîyeke bê xeta ye.

## Heke Rêya Eql Yek Be...

Li Yewnana Qedîm bûyerek heye ku zaîftîya eql şanî dide. Gêncek ji bo tehsîla hiqûqê bike, serî li **Georgîas** (Corcîyas), meşhûrê sofîstan (fîlozofê belağetê, sefsetebêj, demagog) dide. Ji bo vê, wî yê nîvê wê heqdesta ku li serê lihev kiribûn, pêşîn bida, ew nîvê mayî jî, çi çağê ku xwendekar bibûya hiqûqnas û doza ku pêşî qezenc bike, ewê hingê wê bide. Maneya wê ev bû; heke xwendekar doza pêşî qezenc bike, xwendina wî mûkemmel bûye û seydayê wî jî ew nîvê heqdestê yê din jî heq kiriye. Lêbelê di dawîya tehsîla xwe de xwendekar teqsîta yekê kafî û bes dibîne û jê dixwaze ew li teqsîta duduyan bibûre. Ji ber vê daxwazê, doza pêşî di navbera xwendekar û seydayê wî de tehqîq dibe.

Di rûniştinê de xwendekar vê ji heyeta dadgehê re dibêje:

"- Heke ez vê dozê qezenc bikim û qezenc nekim jî divê ez vê heqdestê bidim."

Dadger jê re got:

“-Çima?” Xwendekarî wiha îzah kir:

“-Heke ez vê dozê qezenc bikim, bi mûcibê biryara we divê ez bidimê; heke ez wê qezenc nekim jî, ji ber ku min doza pêşî qezenc nekiriye, bi mûcibê lihevkirina di navbera min û dozdarî de divê ez vê teqsîtê bidimê.

Fîlozofê seydayê wî jî got;

“-Heke ez vê dozê qezenc bikim û qezenc nekim jî divê ez vê heqdestê bistînim.” Dîsa dadger got;

“-Çima?” Wî jî ev bersiv da:

“-Heke ez qezenc bikim bi mûcibê biryara we ezê wê bistînim; heke ez qezenc nekim, bi mûcibê lihevkirina navbera min û dozdarî divê ez wê heqdestê bistînim. Lewra heke ez dozê qezenc nekim, hingê wî ew qezenc kiriye û bi vî awayî şertê teqsîtê duduyan jî hatiye cih û deyn ketiye stûyê wî.

Wekî tê dîtin, herdu jî di îddîaya xwe de zehf eqlber û bi mentiqî bûn. Naxwe wekî vê nimûnê, dibe ku eql û mentiq car caran xwe bixe zindanên ku dibîne û xwe bixe kolaneke kor. Eynî wekî mirov lewhekekî bi dîwarekî ve daleqîne û bibêje: “Bi vir ve îlan daleqandin qedeğe ye!” Ji ber ku ew bi xwe lewhekekî bi wir ve didaleqîne, naxzwe ew bi xwe, xwe tekzîb dike...

Ew eqlê ku di çareserkirina gellek îxtîlafên beşerî yên wekî van de bêçare dimîne û kilîdê li xwe dixe, ma pêkan e ku ew hemû heqîqetên îlahî yên bê nîhayet bi her aliyên wan ve fehm bike? Heke wezîyeta însanî di meselekeke dinyewî de wiha bibe; naxwe halê wî di çendîn meseleyên uxrewî, semawî, rûhî û dînî yên bêjimar ên ku bê arîkarîya wehyê ew hîç nayên zanîn û nayên dîtin de wê çawa bibe? Ewê bi temamî nekarîn, zaîftî û nuqsanî be...

Ji ber vê sedemê, naxwe selametîya eql ji xeteran di vê de ye; divê eql bi wehîyê terbîye bibe û divê ew vê jî fehm bike; ji bo heqîqetên ku ji tixûbê wî dibûrin jî divê ew bi dilê xwe teslîm bibe.

## Sembola Hevnegirtinê; Pozîtîvîzm

Dîtin-nêrîna hemû felsefên materyalîstên ku heqîqetên mûcerred ên dînî red dikin, pala xwe didin "**pozîtîvîzm**"ê. Felsefa pozîtîvîst, ji bo gihiştina heqîqetê, bes "**hewasê xemse**" yanî her pênc organên pêhesînê wek serkehnîya zanînê qebûl dike.

Li gorî vê felsefê, ew çi tişta ku di tecrûba laboratuwarê de ji terefê organên pêhesînê ve neyê mûşahedekirin jê re ti heqîqet nîn e.. Naxwe heqîqet, bes ji bo wan keyfîyetan taybet e ku dikarin bi tecrûba laboratuwarê werin îsbatkirin û bi pênc organên pêhesînê jî werin kontrol-kirin. Ji ber ku Îslam, îmana bi "**ğeyb**"ê jî ferman dike ku her pênc organên pêhesînê ji îdraka wê nekare ne, mezintirîn dijberê wê, felsefeyên pozîtîvîst in.

Pozîtîvîzm, pala xwe dide du esasan ku ew pê re di rewşa nakokîyê de ne. Yek ji van herdu esasan prensîba "**kullîyet**"ê ye, ya din jî prensîba "**zerûrîyet**"ê ye.

Prensîba kullîyetê ev e:

Xusûsîyeteke ku ji bo heybereke tabîî hebe, ew di kaînatê de kullî ye. Mesela, heke hûn aveke saf di laboratuwarê de di bin çewsandineke normal de germ bikin, dema ew av bigihîje dereca herareteke diyar dibe buxar û diçe. Alimekî ev dereca germahîyê bi reqema 100'ê îfade kiriye û ji bo buxarbûna avê yekeyek pêkanîye. Vêca tê îddîakirin ku hemû av di wê dereca germahîyê de dibe buxar. Rastîyên fîzîkî yên dîger jî bi têgihiştina pozîtîvîst wiha tehqîq dibin.

Haleveku di laboratuwarê de bes di tixûbekî sînordar de nimûneyên avê dikarin werin tecrûbekirin. Tu dixwazî bila ev bi hezaran nimûne bin jî. Digel ku li pişt van heta bi bêdawîyê avên tecrûbe-nekirî hebin jî dîsa pozîtîvîst dibêje; "hemû av di dereca 100'ê de dibin buxar." Feqet ev, ji bo wan nakokîyek e. Lewra ew rastbûna hukmekî ku di tesbîta laboratuwarê de derbas nebûbe, qebûl nakin. Digel vê jî dema ji wan were pirsîn, were gotin;

"-Hê we hemû av tecrûbe nekirine, hûn çawa wiha dibêjin?" Ew vê bersivê didin:

"-Ji ber ku tecrûbekirina hemû avan ne mûmkin e, piştî me hijmareke diyar ji avê tecrûbe kir, dema me dît ku hemû av ji bo heman rastîyê bend in, êdî em dikarin li laboratuwara zêhn, vegerin û vê rastîyê bi umûmî bikin."

Haleveku qebûla heqîqetên dînî jî eynî wekî vê ne. Dema însanên dîndar jî ketine meydana mûşahedê, bi eql re guncawbûna rastîyên di van fermanên dînî yên ku karîne bi van pênc organên pêhesînê werin fehmkirin dîtin, ku ew ber bi yên mayî ve jî wilo teselsul dikin û diçin, êdî qebûl û tesdîq kirin ku ev maqûlîyet, di meseleyên ku eql nagihîyê de jî berdewam dike..

Mesela, ew însanê ku di bara bûyerên bêjimar de dibîne ka Cenabê Heq, bi qudreta bêdawîya xwe çawa mexlûqat aferandine, wan dide jîyandin û li ser vê tefekkur dike, ew bi hêsanî fehm dike ku ew, di piştî mirina hemû zindîyan de jî li ser dîsa sağkirina wan qadir e.. Dîsa ew însanê mûşahede dike ku Cenabê Heq, hîç ti zindîyekî ku aferandibe, îhmal nekiriye û cuda cuda rizqên tevan dide, ew bi hêsanî îdrak dike ku ew li axretê, li ser dîtina hesabê hemû bendeyên xwe jî qadir e. Ew bi hereket-kirin ji van rastîyên wekî van ên ku mûşahede dike, di bara heqîqetên ku nikare wan mûşahede bike de jî digihîje qebûl û tesdîqkirinê.

Pozîtîvîst jî digel ku vê keyfîyetê ji bo xwe tabîî qebûl dikin, wê ji bo dîndaran ğeyrê eqlî dijmêrin û hemû heqîqetên metafîzîkî red dikin. Bi vî awayî ew bi xwe re dikevin tezad û nakokîyê.

Di esasê xwe de ev tezad, zaîftîya hevbeşa hemû ekolên felsefî yên li dijî bawerîya tewhîdê ne. **Hezretê**

**Îmamê Rebbanî**, vê tenaquda ku fîlozof li hemberî heqîqetên îlahî ketinê, wiha îfade dike:

*"Çi tişteke bi sosret e ku van kesan, emrê xwe di hînkirina Îlmê Mentiqê de bûrandine ku zêhna mirovan ji xetakirinê diparêze, ev mijar heta bi kitekiteyên hûrê wê jî hîn bûne. Lêbelê dema dor tê ser mijarên giringtirîn yên her wekî Zatê Ellah, sifetên wî û fiêlên wî, ew xwe winda dikin, îlmê mentiqê ji bîr dikin û destpê dikin, tiştên kelevajî dibêjin. Rewşa van dişibihe halê wan kesan ku bi hazirkirina alavên cengê re meşğûl dibin; lêbelê dema wextê cengê tê, ew xwe winda dikin û bikaranîna alavên cengê ji bîr dikin."* [27]

Esasê duyemê mûhîm ê ramana pozîtîvîst, prensîba "**zarûret**"ê ye. Pozîtîvîst, digel ku nekarîne xusûsîyetên di maddeyan de mewcûd û cudahîyên di navbera van de, bi tecrûbên laboratuwarê îzah bikin jî lêbelê dîsa ji van re "**zerûrîyat**" dibêjin û wan qebûl dikin.

Haleveku li gorî pozîtîvîstan her hukm, ji ber ku mecbûr e bi tecrûba laboratuwarê were îsbatkirin, ji bo wan bi xwe jî nakokîyeke eşkere ye ku ew xusûsîyetên heyberan ên ku ji xulqîyeta wan tên, bi "pêş qebûl"-ekê pêşîn dipejirînin. [28]

27. Mektûbat, c. III, 23. Mektûb.
28. Li «Îslam Dunya Goruşu» rûp. 46, 269'an binêrin.

Mesela pozîtîvîst, bes bi tesbîtkirina buxarbûna di maddeyên cuda cuda de û ferqa giranîyeke taybet, yan jî reaksîyona ku ew li hemberî bandorên derveyî şanî didin, îktîfa dike; lêbelê lêkolînê li sebebên van nakin. Lewra hikmeta aferandinê li derveyê elaqa wan e. Ew li ser van tefekkur nakin. Îslam jî van xusûsîyetên wan bi awayekî bi emanc û ğaya aferandina hemû heyberan re guncaw, bi hikmeta "tayîn û tenzîma îlahî" îzah dike.

Qur'ana Pîroz ji bo her mûmînê ku kitêba "**kaînat**"ê dixwîne, vê talîmatê dide, dibêje:

"**Bixwîne! bi navê Rebbê xwe yê ku diaferîne.**" [29] Yanî Îslam ji mûmînî re dibêje; tecellîyatên navên îlahî, sifet û qudreta wî bibîne, temaşe bike, piştre ew jê re dibêje; eql û qelbê xwe biguhêze, ji eserê here mûessirî, ji hunerê here hunermendî û ji aferîndeyan here aferînerî nas bike. Îslam ji mûmînî re dibêje; ne ji bo kaînatê li kaînatê binêre, lêbelê ji bo aferînerê wê li kaînatê binêre.

Herçî felsefa materyalîst e, ji bo mewcûdatan, li mewcûdatan dinêre. Yanî ew bi nêrîneke maddeperestî li mexlûqatan temaşe dike û aferînerê wan piştçav dike. Ew hunerê dibîne lêbelê naxwaze hunermendî bibîne, ew li eserê dimeyzîne lêbelê ji hizirîna mûessirî direve. Ev jî nimûneyek eşkere ya din e, şanî dide

29. Eleq, 96/1.

ka çi qeder nêrîna felsefên materyalîstan li kaînatê ocağ-kor û nuqsan e, di hemberî vê de jî çi qeder nêrîna Îslamê li kaînatê fereh, kûr û mûkemmel e!

Ji bilî vê jî, di nêrîna Îslamê de tekane hebûna mûtleq û wacib Cenabê Heq e. Hemû mexlûqat ji ğeyrê Xuda, bi hebûna xwe ji Wî re deyndar in. Naxwe "**însan**" ne mûtleq e, lê mexlûqat mûqeyyed e.

Ew felsefa ku dibêje; ez pala xwe nadim dîn û ezê wilo heqîqetê bibînim, ew jî însanî li merkeza kaînatê datîne û wî wek realîteya mûtleq dibîne, ew radibe mexlûqatên din jî di eksena wî de û wek pêbendê wî dinirxîne. Her wekî ku bibêje; dinya li etrafên min digere, qamçîyan li Firewntîya enanîyetê û kibra Nemrûdî dixe, ew dibe her wekî mîsala wan bedbextên ku Cenabê Heq di ayetê bi xirabî behsa wan kiriye û gotiye:

"(Resûlê min!) **Ma te ew kesê ku hewa** (û hewesa) **xwe ji xwe re kiriye îlah, dît?.**." [30] Ew dixwazin perdekekê bidin ber nuqsanîyên wekî xeta, nîsyan, nekarîn, zaîftî, îhtiyac û fanîtî yên ku di tebîetê beşerbûnê de mewcûd in û "evd"-bûna însanan bi wan bidin jibîrkirin. Ew, dikevin besîtîya ku wê heyatê û nîmetên dinyayê yên ku Cenabê Heq ji bo însanan lutf kirine bikin aîdê tebîet û tesadufê û hewl didin derîyê evdînî û şukrê ji Cenabê Heq re li ber mirovan

30. Casîye, 45/23

bigrin. Ji xwe malûm e ku ev hemû jî emanc û ğaya mezintirîna şeytan e, ewê ku dijminê mirova ye.

Felsefa pozîtîvîst, esasê hemû fikrên li dijî dîn teşkîl dike, di her meydaneke heyatê de şağ û malbendeke xwe ava kiriye da ku her qada jîyanê bide ber xwe. Mesela îqtîsada komunîzmê di heyatê de û meylên zayendî/cinsî yên Freudîzmê... Çendîn teorîyên li dijî Îslamê hatine danîn da ku werin tetbîqkirin. Ev teorî hemû pala xwe didin wergirtin û telaqîyên pozîtîvîst, pozîtîvîzm jî bi sebeb nuqsanbûna xwe di serkehnîya gihiştina heqîqetê de merdûd (ne meqbûl) e û dijberîtîya van ji Îslamê re, ji bo wan bi xwe tezad, nakokî û bê mentiqîyek e.

## Eql Kêreke Du-dev e

Ew kesên ku eql, xwedî qeweteke bêsînor werdigrin, lazim tê ku ew ji bo qebûlkirina vê jî mecbûr in; divê xwedî eql, hîç ti sûcekî jî nekin. Wisa ye, madem eql ji bo gihiştina rastî û heqîqetê wasîteyeke mûqtedir e, naxwe însanekî eqlmend çima bila sûcekî bike? Çima bila ew ji bo karekî xirab bibe fail, bibe kirde? Haleveku hemû sîstemên beşerî, dema ceza li sûckerî dibirrin qebûl dikin ku eqlê wî li serê wî ye. Heke ew qenaetê pê bînin ku dema wî sûc dikir, melekeyên eqlî yên wî li derveyî dewrê mane, hingê ew nikarin ceza li failî bibirrin.

Naxwe, bingeha mentiqî ya cezadanê, qebûlkirina ku fail xwedî eql e, û eqlê wî jî li serê wî ye. Di vê rewşê de, hem bawerkirina eql di gihiştina xêrê de wek ku ew wasîteyeke kafî ye, hem jî digel vê, ji bo kirina xirabîya wî cezadana wî nakokîyek û tezadek

e. Îslam jî ji ber ku eqlî lazim lêbelê bêkîfayet qebûl dike, ew ji vê nakokî û tezadê dûr e..”[31]

Eql, wekî kêreke du-dev e. Ew dikare ji bo xêrê bibe wasîte û ew dikare ji bo şerrê jî bibe wasîte. Însan dikare bi wî cînayetê bike û dikare pê karên bihavil jî bike... Naxwe ew bilindtirîn sewîya manewî ya ku evd, dibe pê bigihe, bêyî arîkarîya eql, nikare bigihîyê. Feqet di pirranîya caran de jî eql bi xwe ye, ewê ku însanî dixe wezîyeta “**bel hum edall**”[32] yanî ew ji hêla îdrakê ve însanî dixe wezîyeteke ji wezîyeta heywanan jî berjêrtir û nizmtir.

31. Li “Îslam Dunya Goruşy” rûp. 36’an binêrin.
32. Li E‘raf, 7/179; li Furqan, 25/44’an binêrin.

# Windabûna/Hatin-girtina Eql

Fîlozofan, bi eqlên xwe hinek heqîqet tesbît kirine û li ser van sîstem jî danîne. Lêbelê ji feyda van sîsteman bêhtir zirara wan hatiye dîtin. Ji bilî vê xusûseke dîgera ku ew ketine şaşîyê ev e ku rabûne hewl dane heqîqeta însanî li ser temayuleke tenê îzah bikin. Wan heqîqeteke ku di bara realîteya însanî de tesbît kiriye, ew ji sewîyekeke layiqê wî hê çêtir dîtine, yan jî ew bi awayekî wisan şamil kirine heta ku ew temayuleke wisan dîtine her wekî ew tekane temayul be ku temayulên heyatî hemû ji wê re pêbend bin. Ev teorîyên "**monist**" in.

Mesela **Sigmund Freud** (Froyd)[33] ê **yehûdî**, di teza (dawînameya) xwe de dîtin-nêrîneke wiha telqîn dike, diavêje holê; heyata însanî her wekî heyata heywanên li nav daristanê besît e, û bi pirranî jî ew suflî û nehêja ye. Wî bi hîlebazîya xwe gellek heqîqetên girift û bêjimar besît kirine û ji hêla exlaqî ve jî însan

33. Mirina wî; 1939 e.

ber bi sefahet û rezaletan ve ajotiye. Lewra wî temayula tetmînkirina cinsî ya di însanî de ji bo plana pêş derxistiye, temamê failîyetên heyatî yên wî bi vê îzah kirine û temayula ku jê re “**lîbîdo**”[34] tê gotin jî wek sebebê bingehîn ê hemû hadîse û bûyeran şanî daye.

Belê ev temayul, xusûsîyeteke ji aferandînîyê tê. Di sewiye û asteke dîyar de tesîreke wê jî li ser reftar û bizavan heye. Lêbelê şaşîya Freud jî ev e; ew vê temayulê şamil dike, wê bi awayekî wisan berfereh dike ku hemû qadên heyatê dide ber xwe û ew vê realîte’yê jî wek sebebê bingehîn ê hemû reftar û bizavan jî şanî dide. Ev hal û helwesta wî ji wê meylê, dişibihe vê rewşê; mirov li tiştekî biçûçik bi rojikeke (mercekeke) mezinker binêre û wî di çavê xwe de ew qeder mezin bike heta ku ji bilî wî tiştekî din nebîne.

Ha yek ji nuqteyên îxtîlafî û ferqdar di navbera rasyonalîteya (eqlparêzîya) Îslamê û rasyonalîteya (eqlperestîya) felsefa Rojava de ev e. Rasyonalîteya Rojavayî eqlperestîyeke wisan e ku heqîqetên mezin û pirralî besît dike, hewl dide yek-perçê ku dibîne jî wekî ku ew tev be şanî dide, naxwe ew nikare ji xeta û nakokîyan xilas bibe..

Eqlparêzîya Îslamê jî; eqlparêzîyeke wisan e ku yek-perçeyî di nav tevê de dibîne, ji tevê li teferruatan dimeyzîne, naxwe teferruatê çi qeder giringî heq

34. **Lîbîdo**; di doktrîna Freud de hêza jîyanî ye ku şanîderên însîyaqa zayendî/cinsî tîne meydanê.

kiribe, ew, ew qeder qîmet pê dide, wî perçeyî bi perçên din re dinirxîne, wan bi yek dike, wan bi tev dike ku ew pala xwe dide prensîba tewhîdê û tim û daîm jê re sadiq dimîne..

Çawa Îslam, temayulên zayendî (cinsî) yên însên wek realîteyekê qebûl dike. Ew, vê temayula ku ji terefê Xuda ve ji bo însanî hatine dayîn ji bo berdewamîya nesla însanî, înkar nake; lêbelê wê tenzîm û organîze dike. Ew, wê temayulê bi hiqûqa nîkahê, di çarçeveya meşrûîyetê de dide rûnandin. Ew temayula zayendî ya di nav vê çarçoveyê de rewa û meqbûl dijmêre û têkilîyên zayendî yên li derveyî vê çarçoveyê jî -li ser esasê hikmetên bêjimar- nehî û qedeğe dike.

Bi eynî awayî **Karl Marx** (Markis), **Darwîn** û hemû materyalîstên wekî wan jî, ji ber ew ji rêberîya wehyeke ji tehrîfê parastî mehrûm in, ew însanî sade wek saxeki bîyolojîk telaqqî dikin, werdigrin û alema dilî jî înkar kirine. Ew bi vî awayî, ji bo perîşanbûn û sefaletbûna giyanî û îctîmaî ya bi mîlyonanan însanan bûne sersebeb. Di dirêjahîya sedsala 20'an de hewl hate dayîn ji bo utopya'ya Komunîzmê were tetbîqkirin, lêbelê di coğrafya'ya ku wê hukmdarî lê kirî de ew ji reşkirina herdu dinyayên însanî pê ve ji bo tişteke din bikêr nehatiye.

**Karl Marx**, îqtîsad ji bo plana pêşî derxistiye û rabûye heyat û rûdanên wê jî bi vê îzah kirine. Wate wî jî perçekek wergirtiye û perçeyên din jî tine jimar-

tine. Ha va ye eql jî, dema ew ji rêberîya wehyê mehrûm bimîne hevkêşîya terazîyê xirab dibe. Vê carê çi dibe? **Lîberalîst**ên ku heyatê ji ekonomîyê îbaret dibînin û giringîyê bi meşrûbûn û ğeyrê meşrûbûna qezencê nadin, **kapîtalîst** jî însanî dixin wekî diranê makîneyeke ku sirf ji bo wergerandina çerxa ekonomîyê bikêr tê; lêbelê ew rewşa mirovên ku di navbera van diranan de diperçiqin jî hîç nahizirin, **komunîst** û **sosyalîst** jî emrê xwe bi pevçûna 'gelo milk yê kê ye' dibûrînin û xilas dikin..

Ev, û hemû sîstemên beşerî yên wekî vê hîç ti terefekî manewî yê wan nîn e. Ne merhemeta wan heye, ne însafa wan heye, ne wijdana wan heye ne jî îz'ana wan heye...

Herçî Îslam e, îcab û îhtiyacên maddî yek ji gellek realîteyan qebûl kiriye û bi qasî dereca ku ew jê re layiq be jî giringî pê daye. Wê ev realîte jî di ronahîya wehyê de tenzîm kiriye, ji bo hizûr û seadeta însanî jî awayê guncawtir eşkere kiriye û rêyên qezenca helal û meşrû şanî dane.

Dîsa Îslam daye zanîn ku milk, ne yê take-kesî ye, ne jî yê civakê ye; lêbelê ew, yê Xuda ye. Wê daye zanîn ku misliman, ji bo midetekî berwext wekî weznedarekî ye, li ser navê Xuda têde teserrufatîyê dike. Dîsa wê beyan kiriye ku mal û milkê dinyayê li dinyayê dimîne, însan jî di vê îmtîhana li dinyayê de çi kiribe, çi ne kiribe, li gorî wan şekl û awa dide heyata

ebedî ya xwe. Wê ferd ji civakê kiriye berpirs. Wê bi van prensîbên nebewî:

"*Ew kesê ku ziktêr raze û cîranê wî zikbirçî be, ne mûmînekî (kamil) e.*" [35]

"*Ewê ku derdê mûmînan ji xwe re neke derd, ne ji me ye.*" [36] her wekî ku misliman bi hev re zimmet kirine, bi vî awayî edaleta sosyal û tesanud (palpiştî) di sewîyekeke mûkemmeltirîn de tehqîq kiriye. -wekî ku di serdema Ûmer bin Ebdûlezîz de jî wisan bû- di tarîxa Îslamê de zemanê wilo derbas bûne ku di nava civakê de feqîrek peyda nebû ji bo mirov zekatê bidiyê.

Dîsa ecdadê me Osmanîyan, wek netîcekeke van hessasîyetên Îslamî 26 hezar û çend weqf damezirandine ku ew bi xwe dezgeh û mûesseseya merhemetê ne. Kalşên me ew her wekî tevnekê hûnandine û di nav civakê de jî çi birînek hebûye ew her bi çareserkirin û dermankirinê pêçane. Bi vî awayî nehiştiye ku di dilê feqîran de li hemberî zengînan hestên kîn, nefret, hesed û xusûmetê zîğ bidin û wê hizûr û aramîya îctîmaî temîn kiriye.

Ha Îslamê, wekî hemû realîteyên ku cihê wan di heyata însanî de hene, îqtîsad jî bi mûkemmelîyeteke

35. Hakim, II, 15.
36. Hakim, IV, 352; Heysemî, I, 87.

wisan tenzîm kiriye ku ew ji bo dilşadîya dinya û axreta ferd û civakê bibe medar.

Naxwe ji bo mislimanekî bi maneyeke rastîn ew heqîqetên ku “eqlî” werin jimartin; ew heqîqet in ku bi hukmê îlahî re mûwafiq bin û ew di derecekeke wisan de ferehî û kûrahîyê erz dikin ku tim û daîm dinya û axretê li ber çavan datînin.

Ji vî cîhetî ve misliman, tim û daîm hebûneke mûteal, -wate Aferînerê xwe yê ku ji îdrakê bi wêdetir mûkemmel e, ewê ku hemû mexlûq ji tinebûnê anîne hebûnê- ji bîra xwe dernaxe; bi qelbê xwe û zêhnê xwe wî zikr dike, wî tim di bîra xwe tîne.. Ew bi umîda ku wê li axretê bigihîje wî, hizûrê dibîne. Di vê xusûsê de ew felsefeyên ku mehsûla eqlê beşerî ne, ti hizûr û tetmîneke/ dilaramîyeke ku bidin, nîn e.

Bi vê sebebê, gellek fêil û fikrên ku eqilperestîya Rojavayî wan eqlî û mentiqî dibîne, Îslam wan ji maqûlatan (fiêl û fikrên maqûl) najimêre. Mesela Îslam, eqlê mirovên ku eqlê xwe çewt bikar tînin û xwe ber bi kufrê ve dikişkişînin, yan ew mirovên ku wan fermanên dîn wan tewsîye dike sivik dibînin, yan jî eqlê wan kesên ku fiêleke ğeyrê exlaqî meşrû dijmêrin, ji eql najimêre. Lewra eql, dema ji heqîqeta mûtleq re ram be, eql e.

Şair **Fuzûlî**, zaîftîya eqlê ku ji îrşada heqîqetên îlahî re teslîm nabe û bi rasta bêhvila xwe ve diçe, wiha îfade dike:

*Ez ji eql dixwazim delaletê,*

*Eqlê min ji min re şanî dide dalaletê..*

*Ango; "Ez ji eqlê xwe dixwazim ew rêbertîyê ji min re bike da ku min bibe ser rasterê. Lêbelê eqlê min jî tam berevajî vê, berê min her dide ser dalaletê/ rêşaşî û batilî.*"

Ji bilî vê jî sade ne eqlê wî tenê ye, ew tiştên ku hal û bizavên însên dîyar dikin. Însan di heyatê de ji eqlê xwe bêhtir bi hestên xwe qerarê dide. Naxwe ji bo gihiştina heqq û xêrê çawa di rêbertîya heqîqetên îlahî de terbîye-kirina wê eqlê ku merkeza fikr û ramanê ye pêwîst be; eynî wisan di rêbertîya heqîqetên îlahî de terbîye û kamil-kirina wî qelbê ku merkeza hestan e jî, pirr elzem e. Ev jî terbîyekeke manewî ya wilo lazim dike ku ew qelb tesfîye bike, nefsê tezkîye bike û hest, fikr û bizavan jî li ser heqîqetên îlahî îstîqametdar bike.

Heke na, însan bi wan melekeyên zêhnî û temayulên qelbî yên ku nehatine terbîye-kirin, nikare xwe ji wan dîyardeyên surprîz û facîayên serdest, xilas bike. Ew emrê xwe di nav ğefleta ku sefaleta xwe seadet zen dike de dibûrîne, xilas dike. Digel ku ew ji binê lingê xwe heta bi patika serê xwe di xeta û şaşîyan de noq bûye jî, hê jî xwe bê xeta dibîne. Digel ku wî curmên girantirîn jî kirine ji ber vê wijdana wî biçekî naêşe û ew hîç hest bi êş û janeke biçûçik jî nake. Ew di zulm û neheqîyên ku Erş dilerizînin

de noq bûye jî, lêbelê ew ji bo korbûneke qelbî ya ğemgîn û hemaqeteke wisan dûçar bûye ku halê xwe ğayet normal dibîne.

## Em Ji Kîjan Eqlî Re Xizmetê Dikin?...

Gellek zalimên ku di dirêjahîya tarîxê de xwe di zirweya eql de dîtine, ji ber neheqîyên ku kirine hest bi diltengîyeke biçûçiktirîn jî nekirine. Lewra zulma ku kirine li gorî wan, ew neheqîyên xwe yek ji reftar û bizavên biaqiltirîn(!) didîtin.

Berî Îslamê di werçerxa Mekkê de bavan, keçbiçûkên xwe di nav feryadên bêdeng ên ku kezeba dêyan dîn û har dikirin de dibirin bi sağî binax dikirin. Li Mekkê, heke efendîyekî koleyê xwe biguranda, wijdana wî hîç nediêşa, hest bi poşmanîyeke biçûçiktirîn jî nedikir. Bi nêrîna eqlê wan, serjêkirina koleyekî û birrîna êzingekî aynî bûye. Heta wan ev wehşet û hovîtî hemû ji bo xwe wek heqekî ğayet tebîî û meşrû didît.

Împeratorê Hûnê **Atîlla**, ji çolên Karakuruma Asya'ya Navîn dest bi tevgerê kir heta bi Roma'ya Navîna Ewrûpayê tam 7.000 kîlo metreyên çarçikî

mesafe qut kir û wî li pey dagirkerî û îstîlayên ku kirine bes xwînrêjî, êş û jan û hêstirên çavan, hiştibûn.

**Hûlagû**'yê ku çûbû nav Beğdadê ew bajarê şehristanîyan jî, 400 hezar mislimanên masûm di Çemê Dîclê de xeniqandibûn. Ji vê jî zêdetir, kîn û wehşetê ew qeder çavên wî reş kiribûn ku bêjimar eser û kitêb avêtibûn Çemê Dîclê, hem jî ew kitêbên ku her yek ji wan bi keda destan û ronahîya çavan hatibûne nivîsandin.. Dîcle bi rojan di rengên xwîn û mûrekkebê (hibrê) de herikîbû. Ha vî zalimî jî, ji ber van mezalimên ku kiribûn, hest bi êşeke wijdanî ya biçûçiktirîn jî nekiribû.

Ew sefera **Îskender** a ku ji Makedonya'yê destpê kiribû û heta bi Hindistanê dirêj bûbû û ew ğalibîyetên leşkerî yên **Cengîz** û **Tîmûr** jî ji vê cure wehşetê bûne. Ew esera ku wan li pey xwe hiştibû jî bes ji zulm, hêstirên çavan û avdana axê bi xwînê îbaret e.

Dema em li tarîxa serdema nêzîk dinêrin jî, ma **Komunîzm**, ew sîstema beşerî ya ku kêm-zêde li ser serê bîst mîlyon însan hatiye damezirandin jî ne xuyabhîya çêbûna eqlekî wehşî ye? Dema em bi nêrîna heq û heqîqetê binirxînin, ma ev hemû, tabloyeke wehşeta xwînxwara wisan dernaxin holê ku ew keftarên xwînxwartirîn jî bibizdînin?

Heke ew van hemû wehşetên xwe yên ku rûreşîya însanîyetê ne, li gorî eqlê xwe wek serkeftinên mezin bibînin jî, bi îtîbar netîca xwe tarîxê ev tev, wek zul-

mên dehşetdar ên ku îhtîrasên dinyewî ji wan re bûne sebeb qeyd û tomar kirine.

Ha ev însan, belkû bi endaza dahîtîya xwe, kesên eqilmend, qabilîyetmend û dîrayetmend bûne. Lêbelê ji ber ku ew ji rêbertîya wehyê mehrûm bûne, nefsên xwe tezkîye û qelbên xwe tesfîye nekiribûne, wan ev derfet hemû ji bo kirina xirabîyê xistibûne alet. Wijdanên wan hatibûne kuh û kor kirin; perde li ser hestên şefqet, merhemet û dilovanîyên wan hatibûye daxistin. Heke wan, ew wehşetên bi heysîyeta însanîyetê re nelayiq kiribin jî, eqlê wan ev wehşet hemû ji wan re wek bizaveke ğayet tebîî û pêwîst şanî daye.

Di dirêjahîya tarîxê de hemû dîktatorên zalim tim û daîm xwe mafdar dîtine û xeta jî xistine stûyê dîgerên xwe. Îro hemû zulm, cînayet, heta tevkujîyên ku li welatên Sûrîye, Îraq, Misr û yên wekî wan tên kirin ji bo van nimûneyeke tîpîk e.. Ew dîktatorên ku van zulman dikin, ji ber ku eqlên xwe li ber heqîqetên îlahî girtine, dihizirin ku zulmên kirine hereketên bi eqltirîn in. Di encamê de li pişt xwe malwêranî û enqazeke însanî hiştine, beddûayên bi mîlyonan mezlûman li xwe barandine û ew ketine ğeflet û hemaqeteke ew qeder dehşetdar ku nehizirin wan ji bo xwe ezabê uxrewî pirr jî kiriye.

Di her serdema tarîxê de mirov li van cure tabloyan rast tê. Çawa ku teklîfa qazîtîya Beğdadê li hiqûqnasê mezin ê Îslamê **Hezretê Ebûhenîfe** hatibû

kirin. Hem jî ew meqam di piştî xelîfetîyê de bilindtirîn meqam bûye. Lêbelê ji ber Ebûhenîfe zanîbû ku fetwayên wî ji terefê rêvebirên zalim ên di îqtîdarê de wê werin berevajî-kirin û ewê ji bo îcraatên şaş werin bi-aletkirin, bi vî awayî jî wê zulm li mirovan were kirin, wî ev teklîf qebûl nekiribû. Ew rêvebirên ku eqlê wan nedigiha hikmetên redkirina Hezret, ji bo teklîfa wan û peyrew nebûna wî ji bo wan, ew dahîyê mezin xistibûne zîndanê û cezayê qamçî-lêdanê lê birrîbûn. Feqet mezintirîn hiqûqnasê dinyayî, Hezretê Ebûhenîfe, bi berevajî-kirina hukmên Îslamê razî nebû; lêbelê ew bi lê birrîna cezayê qamçîyên di zîndanê de razî bûbû.

Ha ew eqlên ku ji bo îhtîrasên dinyewî û nefsanî bûne êsîr, dikevin dereca hemaqeteke wisan ku şaşîyên xwe nebînin. Eqlekî wiha, çi qeder eqlekî mezin dibe bila bibe, ew ji ketina zulm û xeta'yan xilas nabe.

Ew zalimên ku ev zulm ji bo Hezretê Îmamê Ezam rewa dîtine û li gorî xwe îcraatên xwe heqdar dîtine, di kewaşegeha tarîxê de winda bûne, navên wan jî berze bûye û ew çûne. Lêbelê îro Hezretê Ebûhenîfe, di dilan de ji bo Ehlê Sunnet wel-Cemaetê wek **Îmamê Ezam** dijî û berdewam ew bi dûayên xêrê tê bibîranîn.

## Eqlê Selîm...

Tarîx şahid e ku **Firewn**, **Nemrûd**, **Atîlla**, **Îskender**, **Hûlagû** û emsalên wan, ewên ku di tixûbê teng ê eqlên xwe de hatine hebskirin, bi kirinên xwe ji bo temamê însanîyetê bûne dijmin. Di hemberî van de jî Mewlana û dostên Heq ên wekî wî, ewên ku bi feyza wehyê hatine stran, gihane "eqlê selîm", bi serkehnîya dostanî û mehebbeta îlahî gihane, di dirêjahîya jîyana xwe de heta di piştî wefata xwe de jî ji bo însanîyetê bûne wesîla hizûr û rehmê. Ewê heta hetayê jî ji bo hemû însanîyetê wek dost bimînin.

Bi rastî **Hezretê Mewlana**, di piştî wefata xwe de bi heft sedsalan jî di dilan de jîyîna xwe berdewam dike. Ji xwe malûm e ku îro li parzemînên Amerîka û Ewrûpa'yê di bara rûhê însên de di navbera kitêbên ku zehftirîn elaqê dibînin de *Mesnewî* ya Hezretê Mewlana û hinek berhemên mûtesewwif ên dîger hene. Ji bilî vê jî UNESCO'yê bi mûnasebeta 800 (heşt sed) salîya jidê-bûna Hezretê Mewlana, sala 2007'an wek

sala bîranîna Mewlana ragihandiye, ev jî di vê xusûsê de yek ji pêkhatên balkêş ên dîger e.

Bi rastî Hezretê Mewlana, ji ber ku di berhemên xwe de giranîyê dide ser endazên Îslamê ku jêdera wan Qur'an û Sunnet e. Ew endaz hemû jî însanî wek eşrefê mexlûqat mezin û bilind dikin. Ew şexsîyeteke wisan e ku ji ber însan-perwerîya xwe li Rojava, ji terefê derdorên humanîst ve bi teqdîr tê pêşwazî-kirin.

Naxwe ew mektûba îrşadê, ya ku wî dostê mezin ê Heq bi îxlas ji însanîyetê re nivîsandiye, îro jî li temamê dinyayê eks û xuyabûna xwe dibîne û heyecanê şîyar dike. Lewra *Mesnewî*, eynê li ber alema navxweyî ya însanî datîne û jê re dibe arîkar ji bo ew xwe nas bike û asêpirsên xwe jî çareser bike. Ew, wan rûhên ku di sedsala me de di bin otorîta zêhnîyeta materyalîst de diperçiqin, digihîne hizûr û aramîyê û ji bo hîdayet-bûna wan jî dibe wesîle. Lewra însan, heke ji bo zirweya refaha maddî derkeve jî, heta heke mal û milkê dinyayê tev bibe malê wî jî dîsa ew valahîya ku mehrûmîyeta ji hikmetê di rûhê wî de vedike, hîç tiştek nikare wê tije bike.

**Hezretê Mewlana**, wê heqîqeta ku însanî digihîne seadeta rastîn wiha îşaret dike, dibêje:

"*Ji bîr neke; ew fikrên felsefî yên ku ji tabîet û xeyalê tên meydanê; ne ew hikmet e ku ji feyza nûra Ellah ê sahibê celalê tê meydanê. Felsefa dinyewî di te de; bes zen û şubhê zêde dike.*

*Ji bîr neke; bes hikmeta dînî, însanî ji bo ser asîmanî derdixe, ji bo bi wêdetir jî bilind dike.*

*Mixabin fîlozofên jîr ên axirzeman, zanayên xuy Îblîs, ji yên ku berî wan hatine, çêtir dîtine.*

*Wan hîle hîn kirine û xwe avêtine meydanê. Bi fikrên xwe yên ji dîn re dijber, ew zanayên dostên Heq ğemgîn kirine. Ew bi dûv kar û dûzenên wisan ketine ku eql ji wan nagire!*

*Wan ew sebr, efûkarî, xweşbînî û comerdîya ku îksîra karê eslî û qezenca manewî ye, tine kirine.*"

## Hizûra Rûhî;
## Di Rambûna Ji Bo Hikmetê De Veşartîye..

✓ **Fîlozof**an gotine xebero; em bi eql û hisên xwe yên ku bi zaîftîyên curecur malûl û qudreta wan jî mehdûd dikarin bigihîjin heqîqetê, feqet wan bi van wasîteyan ne karîne dîgeran, ne jî karîne xwe bi xwe tetmîn bikin.

✓ Eqîdezanên ku bi îlmê **Kelam**î îştîğal kirine jî çendan bi mûhtewa'ya wehyê be jî hewl dane bi prensîba zarûrî ya eqlî mûhakeme û mûqayese bikin û rê vekin. Feqet wan jî ji ber ku eql ji xwe re kirine wasîte, bes karîne di wan mewzûyên di daîreya wî de bihavil bibin; di mewzûyên ji eql bi wêdetir de jî, ji îmkanên ku rûhan tetmîn bikin, mehrûm mane.

✓ **Sofî**yên rastîn ên di îstîqameta Qur'an û Sunnetê de jî, ji nuqteya ku eql xilas dibe û bi şûn de bi çeng û perên teslîmîyeta qelbî ya xwe di wergirtina mesafê de dewam kirine. Di encama vê teslîmîyetê de

ji ufûqên **hikmet**ê para xwe wergirtine û ji bo tecellîyatên marîfetûllahê bûne mezher. Gîyanê însanî jî dikare bi qasî rêjeya waqifbûna wî ji hikmetan bigihîje hizûra heqîqî.

Çawa **Hezretê Elî**, vê heqîqetê îşaret dike û wiha dibêje:

"*Bi peyv û bizavên bihikmet bêhna rûhên xwe vekin. Lewra çawa beden diwestin rûh jî wisan diwestin.*"

*"Însanan bi peyvên fikrber û hikmetmend şîyar bikin da ku qelbê wan hizûrê bibîne."*

**Hikmet** bi maneya heqîqî ev e; mirov bikare heqîqeta tiştan û alîyê sirrî/nehanî yê hadîsat û wiqûatan îdrak bike.

**Hikmet** ev e; mirov di mijara îdraka heqîqetê de di eczîyeta eqlî bigihe. Çendîn sirrên ku mirov nikare bi eql wan fehm bike, ew bes bi hikmetê têne çareserkirin. Maneya eslî ya tecellîyatên îlahî di kaînatê de ev e, mirov karibe bi nêrîna hikmetê were xwendin.

Heke **hikmet** nebûya, sirr sergirtî diman. Heke sirr nehatibûna vekirin, dilan nedikarî feyzê ji keş û hewaya îrfanê wergire; **Hezretê Mewlana, Ebdûlqadirê Geylanî, Yûnus Emre, Şahê Naqşîbend, Ezîz Mehmûd Hûdayî** û dostên Heq ên wekî wan, yanî ew şexsîyetên mezin ên ku ji bo dilên mûmîn endaza

îstîqameteke mûstesna ne, nedihatin gihandin û perwerdekirin.

Kehnîyên hikmetê, bes di wî qelbî de tecellî dibin ku ew tezkîye bûbe, yanî ew ji hêla maneyî ve hatibe temîzkirin û merhele qut kiribin. Li ser vî esasî mûmîn, hem di bin terbîye û tezkîya Ellah de, hem jî di bin terbîye û tezkîya Resûlê wî de bi qasî rêjeya ku karibin alema navxweyî ya xwe ji masîwa paqij û xalî bikin, bi qelbekî selîm naîl dibin.

Hedefa nîhaî ya îlman jî kûrbûna di hikmetê de ye. Çareserkirina mûemmayên ku hunera îlahî ew di "**Qur'an, kaînat û însan**" de şanî dane. Îdrak-kirina tecellîyatên qudret û ezameta îlahî ya ku di her zerreyekê de mewcûd e.

Mesela îlmê **tib**ê, ew bi wan qaîdeyên mûezzam ên ku Xuda di wicûdê/bedenê de bicih kirine re elaqedar dibe. Îlmê **Botanîk**ê jî li hawîrdora wan qaîdeyên îlahî yên ku Cenabê Heq xistine wan giyayên ku ji erdê şîn dibin û dertên, failîyetê şanî dide. Hikmet jî bi naskirina xwediyê qaîde û qanûnên ku hemû îlm bi wan ve îştîğal dikin re meşğûl dibe. Lewra ğaya îlm, ne di zêhn de li ser hev kom û dêzîkirina malûmata ye, lêbelê bi qelb îdrak-kirina wan sirr û hikmetên di jêdera eslî ya wan malûmatan de ye. Ev jî bes bi tecellî-kirina nûra îlahî di qelb û dil de mûmkin e.

Ellah Teala ferman dike:

“(Xuda) **kê bixwaze, hikmetê dide wî. Hikmet ji kê re hatibe dayîn, naxwe xêreke zehf jê re hatiye dayîn. Lêbelê bes xwedî eql, difikrin û îbret werdigrin**.” [37]

Ji bo vê ye ku bes ehlê hikmetê mûtesewwifan, gerek di wexta jîyîna xwe de bi îrşadên ku kirine, gerek jî bi eserên ku li pey xwe hiştine, cewabên tetmînkar ji bo asêpirsên însanîyetê dane, bi vî awayî dilên wan îhya kirine.

Di sedsala çûyî de yek ji giregirên alimên Îslamê **Mûhemmed Hemîdûllah** wiha dibêje:

“*Terzê perwerdebûna min eqlparêzî ye. Xebat û hûrkolînên hiqûqî, her tiştê ku bi awayekî îqnaker nayên tarîfkirin û îsbatkirin bi min daye redkirin. Bêşiwar ez, wezîfên xwe yên wekî nimêj, rojî û yên din ne bi sebebên tesewwifî tênim cih, lêbelê bi sebebên hiqûqî wan tênim cih. Ez ji xwe bi xwe re dibêjim:*

«*Ellah Rebbê min e, xwediyê min e. Wî, bi kirina wan ferman li min kiriye. Naxwe divê ez wan bikim. Ji bilî van jî heq û wezîfe bi hev re bend in. Ellah ferman li min kiriye ji bo ez ji van îstîfade bikim; naxwe ez bi şukrkirina ji wî re hatime wezîfedarkirin.*»

37. Beqere, 2/269.

*Ji dema min destpê kirî ku ez di nav civaka Rojavayî de li devereke wekî Parîsê dijîm de, ez bi heyret dibînim ku tişta krîstîyanan ji bo qebûlkirina îslamê diajoyê pêş ne dîtin-nêrînên alimên fiqh û kelamî ne, lêbelê sofîyên wekî* ***Îbnû Erebî*** *û* ***Mewlana*** *ne. Di vê babetê de çavdêrî û mûşahedeyên min ê şexsî jî çêbûne. Dema di mijareke îslamî de îzahetek ji min tê xwestin, cewaba ku min ew dispart delîlên eqlî û min ew dida, wê pirsker tetmîn nedikir; lêbelê îzaha tesewwifî di dana fêkîyê xwe de dereng nedima. Di vê babetê de her ku diçe ez hêza kartêkera xwe winda dikim. Ez vêga bawer dikim ku di piştî îstîla û dagirkerîyên* ***Hûlagû*** *yên ku bûne sersebebê malwêranî û agirpêketinan, wekî ku di zemanê* ***Gazan Xan*** *de jî wilo bû, îro jî, ji hindikahî ve li Ewrûpa û Afrîkayê tişta ku xizmetê ji bo îslamê bike,* ***ne şûr e, ne jî eql e, lêbelê dil e, yanî tesewwif e****..*

*Di piştî vê çavdêrî û mûşahedê de, min destpê kir hinek berhemên ku di bara tesewwifê de hatine nivîsîn, hûrkolîn li ser wan kir. Vê hûrkolîna min, çavê dilê min vekir. Min fehm kir ku rêya tesewwifê di zemanê Hezretê Pêğember de û rêya mezinên mutesewwifên îslamê, ne mijûlbûna bi kelamî ye, ne jî mijûlbûna bi tiştên bêmane ye; lêbelê di navbera însan û Xuda de rêveçûna di rêya kurttirîn de ye, gerîna li rêya pêşvebirin û geşkirina şexsîyetê ye.*

*Însan li sebebên ku wezîfe li wî hatine barkirin, digre. Îzahatên maddî ji bo qada manewî me ji hedef û emancê dûr dike; lêbelê îzahatên manewî însanî tetmîn dikin.*" [38]

Naxwe cewabên tetmînkartirîn ên ku însanîyet li wan digere, bi îlawe li ser mehsûlên mûqayese û mûhakemeyên eqlî, ew cewab in ku mûtesewwif dikarin ji ufûqa hikmeta îlahî bang li dilan bikin. Yanî ew cewabên ku ji zimanê mûtesewwifan sadir dibin û dertên.

Lewra ew zatên arif, ji bo eqlê ku bi wehyê hatiye terbîyekirin û ji bo qelbê ku ji keş û hewaya dostanîya ji Heq re feyzê werdigre, tercuman in. Ew zehf baş dizanin ku tefekkura eqlekî di zemîna arzûyên nefsanî de, di bin teselluta merezên wekî kibr û ğurûrê û di halekî ji rêberîya qelbekî selîm mehrûm de ji mecraya eslî derdikeve; însanî her wekî şeytên ber bi harbûn û rêşaşîyê ve diajoyê. Ji bo vê ye ku **Hezretê Mewlana** gotiye:

"*Heke bi qasî eqlê Şeytên eşqa (wate asoyeke bilinda dilî ya) wî jî hebûya, îro ew nedikete rewşa Îblîs.*"

38. M. Azîz Lahbabî, Îslam Şahsîyetçiliği, terc. Î Hakki AKIN, rûp. 114-115, dîpnot 8. Îst. 1972. Ev jêrenot, metina mektûba Mûhemmed Hemîdûllah e ku di 27 Rêzbera 1967'an de ji wergêrî re nivîsandibû. Ji bilî vê jî li Mûstafa Kara, Metinleriyle Günümüz Tasavvuf Hareketlerı, rûp. 542-543'an binêrin.

Bi rastî pevçûna pêşîna eql, li hemberî Ellah Teala hatiye kirin, ewê ku ew aferandiye û daye jîyandin. Ew ehmeqê wê pevçûna eql jî, ji Îblîs pê ve, ne ti kesî din e.

Dinya, ji şeytanên ku li hemberî fermanên Heq Teala serî hildane tije ye. Wesweseyên van şeytanan, ji bo însanên ğafil wekî eqilmendîyê tên. Haleveku hunera eslîya însanî û eqlmendîya rastîna wî ev e ku karibe xwe ji bo Xudayê xwe yê ku ew aferandiye teslîm bike û xwe ji hîlebazîyên şeytên jî biparêze.

Dîsa **Hezretê Mewlana** di bara giringîya terka pirs û şubheyên li hawîrdora heqîqetên ku ji selahîyeta eql dibûrin û ehemmîyeta teslîmbûna bi qelbê xwe ji bo Xuda û Resûlê wî de wiha dibêje:

"*Eql, digel ku di karûbarên dinyewî yên me de serkeftî ye jî, lêbelê ew bi îcaba mahîyeta xwe, ji bo gihiştina heqîqetê, ji bo gihiştina sirrên îlahî, yanî ji bo wasilbûna marîfetûllahê nuqsan û têrneker dimîne. Ji bo vê rêwîtîya ulwî, wasîteyek lazim e. Ew jî dil e, evîn e, wecd e, îstiğraq e.*"

Ji bo mirov xwe ji korerêya eql xilas bike, divê mirov tezkîya nefsa xwe û tesfîya qelbê xwe bike û bi eşq û şewq ji heqîqetên îlahî re teslîm bibe. **Mûhemmed Îqbal** nebûna rêyeke dîtira ji bilî vê, bi hîkayeteke temsîlî ya wiha îfade dike, dibêje:

*"Ez şevekê li kitêbxaneya xwe rûniştîbûm min bihîst ku kêzikekê ji perperîkekî re wiha digot:*

*«-Ez di nav kitêbên Îbn-î Sîna de bicih bûm. Min berhemên Farabî dîtin. Lêbelê min kir û nekir, min felsefa vê heyatê ji wan fehm nekir. Min taverojek nîn e ku rojên min rohnî bikin...»*

*Li hemberî vê feryada kêzikê, perperîkê perên şewitî yên xwe ji kêzikê re şanî dan û jê re got:*

*«-Binêre!» "min ji bo vê eşqê perên xwe şewitandin.*" Piştre ew wiha pêde çû û dewam kir:

*"-Tişta ku heyatê zindîtir dike; per li hev xistin û hezkirin e; tişta ku çeng û peran dide heyatê jî eşq e!...»*

*Yanî perperîk çeng û perên şewitî yên xwe ji kêzikê re şanî dida û bi zimanê halê xwe jê re digot:*

*«-Tu xwe ji helakbûna di korerêyên kolanên vê felsefê xilas bike! Nesîbê xwe ji deryaya tije maneyên eşq, wecd û feyz ên Mesnewîyê wergire û ber bi wîsalê ve bifire!...»*"

Ha ji bo tenwîrkirina eql û qelb, her wekî perperîkê li hawîrdora ronahîya heqîqeta ku ji serkehnîya îlahî dizenzile, divê mirov bi eşqeke kûr û hezkirin bizîvire û bi ğayreteke bilind xizmet bike. Xilasbûna ji korerêyên eql û gihiştina hizûr û seadetê, bes bi vê sayê dibe ku mûmkin bibe. Dema însan mentiqa

selîm û îlhamê tevlîhev bike, ewê ji esareta şehwetên nefsanî yên fanî xilas bibe û asoyên marîfeta wî wê fereh bibe. Ev jî bi kemala eqlî û gihiştina qelb ji bo bilindtirîn meqamê bêdawîyê tê vekirin.

# Çeng û Perên Eşqa Rûhî

Mûmînek, di her sefha heyatê de îhtiyaca wî bi feraset û besîreta fereha eşqa îlahî heye. Di rewşeke berevajî de guhastina ji qaşilê ber bi kakilê ve, întîqala ji şeklê ber bi heqîqetê ve û ji sûretê ber bi sîretê ve zehf zor e.

Di salên me yên Mekteba Îmam-Xetîbê de xwacê me yê Farisî **Yaman Dede** (Ebdûlqadir Keçeoğlu, v, 1962) dibêje:

"*Min bi qewet, îman bi vê heqîqetê anîye:*

*Ji bo bilindbûnê du per lazim in: «Eşq û îbadet». Eşqa bê îbadet, îbadetê bê eşq, yek-perî ye.*"

Li gorî firîn bi perekî tenê nabe, naxwe zerûrî ye ku mirov îmanê jî û heyata xwe ya îbadetê jî bi eşqê bijî. Îdrak-kirina hemû sefheyên evdînîya ji Heq re bi eşqê û dîsa bi eşqê îfa-kirina wan elzem e. Bes di vê teqdîrê de mirov dikare bigihîje kemalê.

Ji bo vê ye ku eshabê kîram, li hemberî fermanên Xuda û Resûlê wî, ji pêvemanên şunhe û îstifhamên eql bûrîne û tim û daîm gotine: **“Me bihîst û me îtaet kir**.” Dîsa wan bê tereddud gotiye: “**Fedake ebî we ummî ya Resûlellah/Ya Resûlê Xuda, bila dê-bavên min ji te re bi qurban bin!**” Bi vî awayî wan bêçav miçkirin tam bi teslîmîyet karîne canê xwe jî ji bo rêya Mezinê me Resûlê Xuda feda bikin.

Dema Resûlê Xuda ji eshabê xwe pirs kir, ji wan re got:

“*-Kî, wê vê mektûba min a teblîğê ji kralan re bibe?*” Sehabîyan negot:

“Ezê ev qeder rê çawa herim, ma wê merkeba min, zadê min hebe, ezê çawa di navbera celladan de herim û ezê çawa vê mektûbê bixwînim?” Ew neketin mûhasebeyên wiha eqlî, ew bi eşq û şewq û teslîmîyet, bi awayekî dildar û arzûmendane ji bo xizmetê bûne telebkar.

Lewra ew evdên arif bûn ku di netîca terbîya nebewî de ji **eqlê meaşê** derbas bûbûn, gihabûne **eqlê meadê**. Yanî wan eqlê xwe bi heqîqetên îlahî tekûz kiribû, wan eqlê xwe ji wasîtekirina sade ji bo bidestxistina menfîetên fanî, dinyewî û nefsanî derxistibû, tam berevajî vê, ew gihandibûn wesfeke mûsbeta wisan ku ehemmîyet dide heyata ebedî û ji bo hazirîya wê ğeyret şanî dida.

Ji bo vê ye ku eshabê kîram çendan temenê xwe di nav bê-îmkanîyên maddî de derbas kiribin jî, ew mûmînên bextiyar bûne ku ew zemanê têde jîyane, kiribûne “**esrê seadetê**” û medenîyeta fezîletan ava kiribûn. Lewra ev heqîqetek e ku bi êş û janan hatin stran tiştekî din e, bêhizûr bûn jî tiştekî dîtir e... Însan heye ku ji êş û janan re rûbirû ye, feqet qelbê wî di zirweya hizûrê de ye. Însan jî heye ku digel ti derdê wî yê maddîyatê nîn e jî dîsa rûhê wî di nav bêhizûrî û tetmîn-nebûnê de hatiye binaxkirin û qelbê wî jî di gerînekên qeswetê (bextreşîyê) de winda bûye û çûye.

Ha dema em li civaka esrê seadetê dinêrin, em li ti buhraneke psîlojîka mislimanan rast nayên. Hîç di ti hedîseke şerîf de, yan jî di ti rîwayetekê de em nabin şahid ku mislimanekî di bara nerehetîyeke psîkolojîk de pirsek sûal kiribe.

Maneya vê; îmaneke ku bi eşqê dihate jîyîn û heyateke îbadetê ya ku di nav xuşûê de dihate îfa-kirin; ew hizûra dilî ya ku wan dida mûmînan, di eynî zemanî de ew dibû wesîla tedawîyeke rûhî jî. Bawerîya bi hebûna heyata uxrewî, di çavên wan û dilên wan de hemû problemên dinyewî biçûk dikirin. Wan çi qeder xwe dida ber penaha qudreta mezin û bilindtirîn û di şiûr û îdraka îmanê de kûr dibûn, ew qeder hizûra rûhî jî didîtin.

Dema Cenabê Heq jî di Qur’ana Pîroz de medhê **Ensar** û **Mûhaciran** dida, gihiştina vê eşqa îmanê

ya ku di wan de hebû û gihiştina ufûqa sedaqet, teslîmîyet û îtaetê ji bo temamê ummetê, wek îdealeke evdînîyê şanî dide.

## Bila Eql Ji Bo Mûstefa Bi Qurban Be!..

Divê em bi xwe jî zehf zêde mûhasebe bikin ka em ji bo Xuda çi qeder karin hewa û hewesên xwe û hesabên eqlê dinyewî û nefsanî yên xwe terk bikin. Daqene em jî karibin wekî hemû pêğemberên ku ji bo tewhîdê têkoşîn kirine û wekî ummetên bi îxlas ên wan, di rêya Heq de mesafê qut bikin, divê em bi diqqet binêrin ka em karin pûtên di nava xwe de çi qeder wergerînin erdê û wan bişikînin. Divê em lazim nebînin û em ayetên pîroz û hedîsên şerîf di nav sînorên teng ên eqlê xwe de bipîvin, lêbelê divê em jî her wekî eshaba bi eşq, wecd û teslîmîyet wan qebûl bikin û karibin bibêjin; "**me bihîst û me îtaet kir!**"

Divê em jî karibin wekî bibêjin çawa ku **Hezretê Mewlana** bi tabîra xwe vedibêje;

"*Divê em karibin eqlê xwe di hizûra Hezretê Mûstefa de bikin qurban*."

Divê em jî karibin bibêjin, çawa ku **Necib Fazil** bi zimanê xwe gotiye;

*Nebêje; çavê min, eqlê min, fikrê min heye, tevan bikuje!*

*Heke ew tişta ku ji te re wekê çolê tê, Ew jê re dibêje gol e, ew gol e!*

*Mizgîndarê min, xilaskerê min, mezinê min, Pêğemberê min;*

*Ew endaza ku li Te nayê, heyat be jî ezê wê bixim bin lingê xwe!..*

*Heke te jî însan û civak, Te jî bingeh û avahî;*

*Heke te dabe zanîn ka te çi anîye, çi birîye, amenna!..*

Divê em jî wekî wî karibin bi vî awayî teslîmîyeta xwe ji Mezinê me Fexrê Kaînatê re îfade bikin.

Alim û mûtefekkirê mezinê Îslamê **Îmam Ğezalî** jî wiha dibêje:

"*Di piştî sefheyên îdrak, tedqîq û tenkîda di mewzûya Felsefê de, dema min dewama (mesaîya) himbiza xwe di vê xusûsê de gihande dawîyê, bi îtîbara meqseda xwe, min fehm kir ku ev îlm jî têrê nake, eql bi tena serê xwe ji bo fehmkirina her tiştî ne bes e, ew nikare perdê ji ser her meselê rake..*" [39]

39. El-Mûnqîzû mîned-dalal (Behsên tesewwifî, Ji Îmam Ğezalî ders), rûp. 127-128, Kîtab Dunyasi Neşrîyat, Îstanbul 1984.

**Necîb Fazil Kisakurek** di berhemeke xwe de rewşa **Hezretê Ğezalî** di navbera qadên eql û marîfetê de wiha vedibêje:

“*Ew zilamê mezinê tefekkurê ku bi «**huccetê Îslamê**» tê bibîranîn… Wî hemû karên qefa û îdrakê, yên îlmî û fikrî li terefekî danîn û dema wî kir berê xwe bide ser îstîqameta marîfeta rastîn wiha got:*

*«-Min dît ku her tişt ji xwe avêtina ber penaha feyza rûhê pêğemberê pêğemberan îbaret e, ya ji wî bi şûn de sade xapxapok, wehm û xeyal e!.. Eql jî hîçek e… sade tixûb e!»*

*Ev serê bi heybetê ku cîhanê hemtayekî wî nedîtiye, wî hemû îstifhamên (pirsnîşanên) xwe mevirandin û xwe avête ber penaha feyza pêğemberê pêğemberan û bêtixûbî dît.*” [40]

Divê em vê ji bîr nekin ku heke însan sade ehemmîyetê bide eqlê xwe, heke ew xwe bi dev wê ğefletê ve berde ku her wekî wî bike pût di wê derecê de wî tekane pûsûla’ya heqîqetê zen bike, hingê ew dibe ku wî li ber xwe hem jî bi destê xwe hemû qenalên îdraka rûhî û eqlî xitimandine.. Ji xwe eqlekî ku pêlîza nefsê û pêkenoka şeytên be, ewê qelb reş bike û rûh jî felc û şeht bike.

40. Velîler Ordusundan, rûp. 213, Buyuk Doğu Yayinlari, Îstanbul 1976.

## Neynika Heqîqetê...

Zerûrî ye ku her însan di terbîya manewî re derbas bibe. Di nava vê terbîyê de ji bo ew karibe kêmasîyên xwe bibîne û ji bo telafîkirina wan ğeyret bike jî, îhtiyaca wî bi neynika heqîqetê heye da ku ew têde halê xwe seyr û temaşe bike.

Ev neynik; di serî de Qur'an û Sunnet e. Di piştî wan de jî ew zatên alim û arif ehlê teqwayê ne ku bi sedaqet li pey rêç û şopa Resûlê Xuda diçin. Însan bê teblîğ û îrşada van zatan, ew xwe bi xwe ne dikare eqlê xwe bike eqlekî selîm, ne dikare nefsa xwe ji xirabîyan tezkîye bike, ne jî dikare qelbê xwe ji nexweşîyên manewî tesfîye bike.

**Hezretê Mewlana** di *Mesnewî* ya xwe de çi xweş dibêje:

"*Pîrê têgihayî yê ku rê dizane, ji bo bağ û bostanê nefs û çerm coyekê vedike, avê dide herikandin û pîsîtîyên li wir paqij dike.*

*Ma herka aveke pîs û murdar, dikare necasetê/ pîsîtîyê paqij bike? Ma însan bi zanîna xwe, dikare hestên nizmî yên di xwe de ji hinavê xwe bimale û bavêje?*

*Ma kesek, wê çawa bi xwe cobara (dere) xwe paqij bike? Zanîna însanî, bes dema feyzê ji îlmê Xuda bigre, bihavil dibe..*

*Ew kesê ku kêmasîya xwe dibîne, ber bi kamilbûnê ve bi çargevkî baz dide. Ew rebenê ku xwe kamil zen dike jî ber bi Xuda yê sahibê celalê ve, bi cehalet û vê kibra xwe) ji ber vê zena xwe bilind nabe..*

*Ey kesê ku xwe kamil dibîne! Di rûhê te de ji vê gumana ku tu xwe kamil zen dikî îlleteke (nexweşîyeke) xirabtir nabe!...*"

Ji lewma, ji bo mirov karibe selametiyê ji korerêyên eql bibîne, îcab dike mirov bikeve bin terbîya Qur'an û Sunnetê û mirov karibe di nav ahenga eql û qelb de mesajên îlahî û nebewî bixwîne.

Eql, dema li ser wê **Qur'ana Pîroz** tefekkur dike ku ew ji bo heqîqetên **însan, kaînat** û yên di van de di mesabeya neynikêyê de ye, netîca ku ew bidestxîne eynî wekî wan madenên xam e ku ji axê têne deranîn. Tişta ku van madenan dixe ber û mamûl jî, qelbek e ku ew ji mehebbeta îmanê tije ye.

**Qelb**; Merkeza hissîyata ye wate hesta ye. Qelbekî ku ji ğeyrê Xuda hatibe tesfîye-kirin û ji hêla

maneyî ve sewîye qezenc kiribe, wê selahîyet û qudreta ku bi peyvên wekî “heds, îlham û sinûhat” tên îfadekirin bi delîlên ku eql ew pêşkêş kirine re bi yek dike, eynî wekî perçeyên vazoyeke şikestî ku wan perçeyan tîne cem hev û şeklê eslî yê wê derdixe holê, ew jî îdraka heqîqetê bi maneya kamila wê temîn dike..

Bi rastî Qur’ana Pîroz, wekî okyanûseke bêserî û bêbinî ye ku qelb bi qasî rêjeya sewîya xwe dikare xwe di kûrahîya wê de noq bike. Çawa ew însanê ku sobaberîyê nizanibe, bes dikare xwe bixe nav avên ne kûr û mesafe qut bike. Lêbelê noqavekî pispor, dikare xwe di kûrtirîn deverên deryayê de jî noq bike; heke ew çendîn ecayîb, ğeraîb û dîmenên curecur û alemên cipûcuda yên ku mirovên li peravên deryayê wan nabînin jî, seyr bike, eynî wilo ew kesên ku di rêya teqwayê de bi qelbê xwe merhele qut kirine jî di Qur’anê de li çendîn tecellîyatên hikmetan rast tên û bi maneya rastîn ji wan feyzê werdigrin.. Çawa ew kesê ku li bîreke kûr dinêre serê wî digere, hisên qelbî yên wî kesê ku xwe di heqîqetên Qur’anê de kûr berdide jî wilo ji bo bêdawîtîyê tên vekirin, ew evdî dixin rêwîyê newala heyretan û berê wî diajon ser par wergirtina ji marîfetûllahê.

**Welhasil,** bi awayekî mûkemmel îcara’ya gihiştina heq û xêrê lazim dike ku eql, bi wehyê were terbîyekirin û di nuqteya ku eql xilas dibe de jî divê qelbekî xwedî îmana kamil bikeve dewrê û bi

teslîmîyet wê nuqsanîyê telafî bike. Naxwe bê heyata qelbî û hisên manewî yên wî, mirov nikare sirf bi eql tenê derbas bibe û bikeve nav alema heqîqetên bêdawî.

Ev îfadeyên **Necîb Fazil** jî di bara îdraka heqîqetan de wiha îşaret bi fonksîyonên (wezîfên) **eql** û **qelb** dikin, ew dibêje:

"*Eql wekî wî paleyî/emeleyî ye ku li ser pişta xwe aletên pîvanê dikişîne û dibe, ew hestên bihîstinê taqîb dike. Hest berî hizrê tê, dema ew tê jî eql dest bi pîvanê dike. Em her tiştî ji nişka ve îdrak dikin. Ev bi hestpêkirinê dibe, bi eql nabe. Bi qelb dibe, yanî bi rûh dibe... Eql li pey rûh tê û bi qiyasên xasê xwe, wan bi aletê çendînîyê (kemmîyetê) dipîve.*" [41]

Hinek fîlozofên ku têgihane eql bi tena serê xwe ne kafî ye, di lêgerîna rêya heqîqetê de bi dûv lêgerîna wasîteyên din ketine. Êdî gellek felsefezan derketine holê. Hinek ji wan bi hisê, hinek ji wan bi hestê hinek ji wan jî ketine qadên îrrasyonal (ne eqilane) û li çareserkirina probleman gerîyane.

Yek ji van jî fîlozofê Fransiz **Henrî Bergson**[42] e. Ew wê keyfîyeta ku jê re "heds" (sinûhat), yan jî entuvîzyonê (his û sehekê) tê gotin di gihiştina heqîqetê

41. Batı Tefekkürü ve Îslam Tasavvufu, rûp. 85-86.
42. W. 1859. M. 1941.

de wek wasîteyekê qebûl dike. Ew di nav fîlozofên ku eql esas digrin de yekê ji îstisnayan teşkîl dike.

Lêbelê ji ber ku bihar bi çîçekekê nayê, dîsa însan di lêgerîna heqîqetê de di asteke têrker de ji felsefê cewabên tetmînkar hêvî nake. Ji vê jî zêdetir, ji ber ku **Bergson** ji kultura Îslamê ne agahdar û ne waqif e, nikariye vê keşfa xwe îkmal bike. Lewra ew Încîla mûherrefa (tehrîfkirîya) ku bi destê xwe girtibû û îman pê anîbû, wekî Qur'ana Pîroz ne wasîteyeke parastî ye.

Ji bilî vê jî, ewên ku wehyê li derve dihêlin û bi piştgirêdan bi eql tenê li heqîqetê digerin, çawa ew ber bi dalaletên (rêşaşîyên) curecur ve hatibin kişkişandin, eynî wekî vê ewên ku bi awayekî ji rêbertîya wehyê dûr di netîca rîyazet û mûcahedeyan de digihîjin hinek keşf û îlhaman jî, ew jî bi heman xeter û tehlûkê re rûbirû ne.. Lewra di xusûsa 'gelo ev keşf û îlham Rehmanî ne, yan jî şeytanî ne,' dîsa mirov nikare bêrêbertîya wehyê wan ji hev û din veqetîne.

Ji bo vê ye ku **Hezretê Îmamê Rebbanî** van şîyarîyan dide, dibêje:

"*Rêya riyazet û mûcahedê jî eynî wekî rêya birêvebirina (delîl-xwestin û nêrîna) eqlî ye. Çawa li derveyî rêberîya pêğemberan eql û fikr ji bo me dîtina heqîqetê temîn nakin, riyazet û mûcahede jî di maneya nîhaî de ji bo me gihiştina Xuda temîn nakin. Ji ber pêğemberan bi navgîna melaîketên masûm emanet ji*

*Xuda Teala wergirtine, malûmatên wan li ber desttêwerdana şeytanan hatine parastin. Lewra Rebbê me di bara Şeytan de gotiye: «**Bêşiwar hakimîyeta te li ser bendeyên min nîn e**.»*[43] *Bi vî awayî Xuda, piştevanîya pêğemberên xwe kiriye.*" [44]

43. Hicr, 15/42.
44. Mektûbat, c. III, 23. Mektûb.

## Sergêjîyên Akademîk

Digel van hemû heqîqetan jî, em di roja xwe ya îroyîn de bi kul û kovan mûşahede dikin ku îlahîyatçî (!) jî felsefê çêtirîn û bilindtirîn îlm dibînin û zanist û îlmên ku jêdera wan Kîtab û Sunnet be jî biçûk dibînin. Ev fikr di navbera wan de rewacê dibîne.

Alimekî dînî yê ku felsefa fanîyan nexwendibe, di nêrîna van zewatan de naqis (netemam) heta wek cahil tê dîtin.

Ji bo felsefê "mehkema bilinda îlman" tê gotin. Bi vî awayî, hinek mirov ğeyretan şanî didin ji bo qedrbilindîyê jê re bexş bikin her wekî ku ew hesta xwe nizm û kêm-dîtinê vedişêrin.

Tê gotin; 'wehyî, tefekkura eqlî cemidandiye(!)' Bi vî awayî, ev gotin bi qesdî, yan jî bi awayekî cahilane tê gotin. Ev cure îtham û îftîra li holê têne avêtin lêbelê bi temamî nav-vala û pûç in.

Meqamê beşerî û sifetê îlmî yê wî çi dibe bila bibe, **Hezretê Mewlana** berî sedsalan wiha bang li van erbabê ğeflet û cehaletê dike, ji wan re dibêje:

"*Heke bêhvila te bêhnê nake, hema hîç nebe, qebahetê nexe stûyê gulê.*"

Wate; "Heke tu nikarî di hikmet û heqîqetên bêdawî yên Qur'anê de tefekkur bikî, hema hîç nebe, nekeve wê ğefleta ku tu wê îtham bikî û sûc bixî stûyê wê, heke tu li xeta digerî, di xwe de li xeta bigere!"

Lêbelê ev jî heqîqetek e ku mirovê ji cehaleta xwe heydar be, pirr hêsan e ku mirov wî bîne ser rêya rast. Lêbelê pirr zor e, mirov karibe wan cahilên ku xwe alim zen dikin û di vê hewa û hewesê de ne, dibêjin; "em dizanim" bîne ser rêya rast. Çawa ev tesbîtên **Hezretê Bedîûzzeman** her wekî îfadeya vê heqîqetê ne:

"*Di zemanên berê de dalalet (rêşaşî) ji cehaletê dihat. Tinekirina vê hêsan e. Di vî zemanî de (jî) dalalet, (yanî) êrîşa li dijî Qur'an, Îslam û îmanê; ji fen, felsefe û îlmê tê. Îzale-kirina vê jî mûşkil e. Di zemanê berê de qismê duduyan ji hezarî yek peyda dibû; ji mirovên ku peyda dibûn jî bes ji hezarî yek bi îrşadê dihate ser rê. Lewra mirovên wisan hem nizanin, hem jî xwe zana zen dikirin.*" [45]

45. Sozler, rûp. 752.

Çawa Cenabê Heq, rewşa mirovên ku bi ğurûra îlmê xwe bi jehrê ketine -çendan bi malûmat û agahîyên xwe nebin jî- lêbelê bi xuy û exlaqê xwe ber bi cehaletê ve hatine kişkişandin ji alimên Îsraîlîyan nimûne tîne, wan dişibihîne; “**kerên ku bi cildan kitêban hildigrin**”[46].

Sergêjîya akademîka jêder Rojavayî ya ku bi awayê eql xistin pêşîya wehyê tê îfadekirin. Fitneya “**tarîxîparêzî**”ya ku wek tezahureke dîtira vê sergêjîya rojavayî jî ber bi hinek Fakulteyên Îlahîyatê ve pijiqîye, di vê xusûsê de meselekeke dîgera zehf balkêş e.

Ev gurûh jî karektêra “**alemşimûlî**”ya ayetên Qur’anê înkar dikin û wan ji bo nîqaşê vedikin. Ew hukmên îlahî yên ku di hinek ayetan de hatine ragihandin îdîa dikin û dibêjin; ew ji bo wî zemanê ku têde nazil bûne taybet in û bi îtîbara netîca xwe, ew mehellî û xwecihî ne. Yanî ew sade ji bo qewmê Ereb in û ew ji bo mislimanên Esrê Seadetê tenê bûne. Ew bi vê îddîaya xwe rê li ber tevlîhevîyeke dehşetdara îtîqadî vedikin.

Ji bilî vê jî evên ha, selahîyeteke ku Cenabê Heq ji bo Resûlê Dilovanê xwe jî nas nekirî û nedayîyê, wê di destê xwe de dibînin û cur’et dikin ku di hukmên guhêrneberê dînî de tadîlatê bikin.

46. Li Cumûe, 62/5’an binêrin.

Erê, Îslam, li hemberî şertên sedsalan ên ku guherîne ji bo karibe bersiva îhtiyacên însanîyetê bide selahîyeta îctîhad-kirinê di delîlên aqilî û fer'î yên di nav mûhtewaya Qur'an û Sunnetê de nas kiriye. Lêbelê ev selahîyet, bes daye wan kesan ku di dereca mûctehîdî de alim bin. Ji bilî vê jî di xusûsên ku nessa qet'î hebe de ji îctîhadê re cih û mekan nîn e. Mesela, di hiqûqê mîrasê de ji ber ku nesseke qet'î heye di wê xusûsê de îctîhad nayê kirin.

Lêbelê li gorî tarîxî-parêzan ev xusûs hemû jî hatine nîqaş kirin. Ev cesareta cahilane ya wan, di wextê xwe de wê tehrîfata ku cihû û krîstiyanan li ser Tewrat û Încîlê kirine, tîne bîra mirov.

Emr û nehyên (ferman û qedeğeyên) Îslamê, li gorî xusûsîyetên tebîetê însanî yên ku her eynî dimînin û hîç naguherin hatine dîyarkirin. Ev hukm, ew qeder mûkemmel in ku ji Esrê Seadetê bigre heta bigihîje qiyametê di her zemanan de û hemû mekanên ku însan bigihîje wan, karin bersiva îcab û îhtiyacên wan bidin.

Bi vê sebebê ye ku hukmên Qur'anê hîç kevin nabin û ehemmîyeta xwe jidest nadin. Mûkemmelîyeta xwe di xusûsa ku karibin bi awayê sipehîtirîn îhtiyacên beşerî pêşwazî bikin de tim mûhafeze dikin. Naxwe ev gotina; hinek ji hukmên Qur'anê "tarîxî" ne, yanî ji bo zemanekî mûayyen û mekanekî mexsûs

in îfadeyeke dalaletê ye ku serê wê digihîje heta bi kufrê.

Lewra Cenabê Heq, di navbera zemanî de dema pêkhata civakan guherîbe tim pêğember ji wan re şandine -digel ku hukmên îmanî û îtîqadî her eynî mane jî- lêbelê li gorî îhtiyacên zemanî, yanî qanûnên amelî û tetbîqî danîne. Mezinê me **Resûlûllah** jî pêğemberê axir zemanî ye. Êdî di piştî wî de wê ti pêğemberek neyê şandin. Naxwe ew hukmên ku wî anîne, di mahîyeteke wisan de ne ku heta qiyametê karin bersiva însanên tên tevan, bidin.

Berevajî vê fikr kirin; rêşaşîyeke wisan dehşetdar e, her wekî ku mirov bibêje; Cenabê Heq, ewê ku însan aferandiye, naxwe ji wî bi xwe jî bêhtir pê dizane, û bi îlmê bêdawî yê xwe jî tiştên ku heta vêga bûne û ewê ku wê hê bibin jî tevan dizane, aciz û nekare ye.. Ev ehmeqîyeke wisan berbat e her wekî wê ehmeqîya Îblîs ya ku Cenabê Heq ew xelq kiribû lêbelê ew pê re ketibû cîdalê.

Ji vê hêlê ve, bi qasî mûnaqeşe-kirina hukmên Cenabê Heq, hem jî bi wî aqilê ku Cenabê Heq daye însanî, rewşeke abestir nîn e. Ji bo mirovên ku ketibin vê ehmeqtîya wiha, divê mirov van ayetên ha di bîra wan bîne:

“**Bibêje; ma hûn dînê xwe li Xuda didin hînkirin? Hal-hal e ku Xuda yên li asîmanî dizane û yên li erdê jî dizane. Xuda her tiştî bi heqê wî dizane**.” [47]

**“... Yan jî hûn îmanê bi hinek qismê kitêbê tînin û hûn hinek ji qismê wê jî înkar dikin? Ji we, ewên ku wisan tevdigerin cezayê wan li dinyayê riswatî ye; roja qiyametê jî ew li ezabê dijwartirîn têne vegerandin. Xuda, ji tiştê ku hûn dikin hîç ne ğafil e.”** [48]

Mezinê me **Resûlûllah** wiha gotiye:

“*Qur'ana Pîroz, kelamekî wilo yê îlahî ye ku ew, însanî li dijî her cure fitneya ku wê were meydanê digihîne selametiyê. Têde xeberên mirovên ku berî we hatine û çûne, rewşa mirovên ku piştî we werin û hukmê rûdanên ku wê di navbera însanan de werin meydanê hene. Ew, heq û batil ji hev diqetîne, ne (hukmên ne lazim) malayanî ne. Cenabê Heq wî serxweveçûyê ku wê terk bike, dibe helakê. Ewê ku li derveyî wê li hîdayetê bigere, Xuda wî dixe dalaletê...*” [49]

Bêşiwar ev hemû fitneyên ku di roja me ya îroyîn de di qada dînî de derketine holê, şanîdereke eşkere ye, dide xuyakirin ka meydan çawa bi cehaleteke mezin hatiye tijekirin. Xwacên aqilê van fitneyan,

47. Hucûrat, 49/16.
48. Beqere, 2/85.
49. Tirmizî, Fedaîlû'l-Qur'an, 14/2906; Darimî, Fedaîlû'l-Qur'an, 1.

kesên bedbextên şekl ellame ne ku bi awayekî baş li ser Qur'ana pîroz tefekkur nekirine, kullîyateke tefsîr û hedîsê bi têgihiştin venekirine û nexwendine, bêyî jêrxaneke sağlema wan ya dînî hebe, ew sere-sere û bi nîv xwendin karîyera îlmî bidestxistine. Ew fikrên ku îddîa kirine jî, îfadeyên bêşensî ne, ku wan heyranîya nefsanî ya xwe li hemberî fikrên batil anîye zimên.

Lewra heke wan bi awayekî layiq û baş karîbûya li ser Qur'ana pîroz û hedîsên şerîf tefekkur bike, wan didît ku bi ti awayan rewş wekî ku wan zen dikir nîn e.. Çawa Cenabê Heq di Qur'ana Pîroz de -bi qalibên mûxtelif û curecur tam di 137 cihan de- bang li me bendeyên xwe dike ji bo em li ser hikmet û heqîqetên îlahî tefekkur bikin. Ji vê jî zêdetir, ew asoya tefekkurê ya ku Qur'anê ji însanî re vekiriye, ne mûmkin e, tefekkura bi hezar salan ya aqilekî ji wehyê mehrûm bigihîje wê..

Alimekî Îslamê yê ku rêbertiyê ji însanîyetê re bike, divê xwe di tefekkurê de kûr berde. Hem jî divê ew usûlên mûhakeme û mûqayesê, îlmên wekî mentiq, matematîk, îlmê sîyasetê, exlaq, sosyolojî, psîkolojîyê zanibe. Ji bo her alimê Îslamê, wezîfe ye ku ew mahîyeta herk û tevgerên fikrî û felsefî yên li dinyayê hîn bibe. Dîsa divê ew xwe di ast û sewîyekeke wisan baş perwerde bike ku heke îhtiyac pê çêbibe ew karibe li hemberî meydan xwendinên van tevgeran bersivên Îslamê bide. Bi îmaneke ku bi

tefekkura Qur’an û Sunnetê koka xwe qaîm berdabe, ji hînbûna fikrên batil, ên wiha û mûcadelekirina li dijî wan ti zirar nayê.

Tam berevajî vê mislimanekî ku heqîqet îdrak kiribe, ew çi qeder zaîftîya dîtin-nêrînên dinyayî yên li derveyî Îslamê bibîne, ewê baştir qîmet û îhtîşama Îslamê îdrak bike. Ev jî wê bibe wesîle, ji bo îmana wî hê xurttir bibe. Lewra heqîqet, bi dijbera xwe hê nettir û zelaltir tê fehmkirin.

**Necîb Fazil** dibêje:

“*Îmana sipehîtir, wekî Mûhyiddîn Îbn-î Erebî gotî, ewa ku (mirov) menşe’a/jêdera kufrê dibîne û wilo tê holê ye. Naskirina jêdera kufrê, ji bo her mûmînê (kamil) deyn e... Yanî kar bi gotina; «ez dijminê komunîsta me!» xilas nabe... Fehmkirin lazim e...*” [50]

Noqavekî pispor, dikare di behrên kûr de bêtirs avjenîyê bike û dîmenên mûhteşem temaşe bike. Mûmînekî xwedî sewîye, heta lingê sabitê pergarê di şerîetê de be, ti mehzûr têde nîn e ku ew bi lingê dîgerê xwe di nav kultura 72 (heftê û du) milletan de bigere. Ya mehzûr (qedeğe) ev e; ewê ku sobaberîyê nizanibe xwe di behrên kûr de noq bike. Wate, mirovekî ku bi awayekî layiq kultura Qur’an û Sunnetê hezm nekiribe; dema ew ji bo fikrên batil, ên

50. Batı Tefekkürü ve İslam Tasavvufu, rûp. 69.

ku bi teknîkên dîyalektîka hêzdar (leystikên mentiqî) bibe mûxateb, wan heqîqet zen bike, yan jî bi kêmasî ji bo batilî hest bi heyrantîyê bike.

**Hezretê Îmamê Ğezalî** di vê xusûsê de van şîyarîyan dike:

“*Ew kesê ku aqilê wî li serê wî be pêşî rastîyê nas dike; paşê li peyvê bi xwe dimeyzîne. Heke ew peyv rast be, wê qebûl dike. Ew cudahîyê nake, nabêje; ewê ku ev peyv gotî, terefdarê heqîyê ye, yan jî alîgirê batil e. Ji vê jî bêhtir, ew hê zehftir dixwaze peyva rast a ku ketibe navbera peyvên rêşaşan ji navbera peyvên batil cuda bike û derxe. Lewra ew dizane ku madena zêr di nav axê de tevlîhev e. Serrafekî ku bi qabilîyeta ji hev veqetandina xwe bawer be, hîç ti zirar nîn e ku ew destê xwe bixe kîsê qelbezan da ku zêrê xalis ji diravên qelb (sexte) veqetîne. Serrafê biezmûn ji kirrîn-firotina qelbezanî zirar nabîne, lêbelê xelkê cahil zirarê jê dibîne...*

*Ez sûnd dixwim ku pirranîya însanan, di xusûsa ji hev veqetandina heq û batil û hîdayet û dalaletê de xwe têr aqil, hosta û pispor zen dikin. Bi vê sedemê divê mirov derî vekirî nehêle û bi qasî mûmkin be mirov nehêle ti kes berhemên rêşaşan bixwîne.*” [51]

51. El-Mûnqîzû mîned-Dalal (Tasavvuf Bahisleri, Îmam-i Ğezalî’den Dersler), rûp. 125.

Wekî ku ji van îfadeyan jî tê fehmkirin, yek ji mezintirîn mehzûrên îştîğala bi felsefê jî ferq nexistina wan şaşîyên ku ketine nav dîtin-nêrînên rast ê felsefî ye, ew jî rast zen kirin û bi vî awayî ketina xetayên îtîqadî ye. Çawa di zemanê me de dema mûsteşriq (oryantalîst-rojhilatnas) jî di bara Îslamê de nirxandinan dikin, ji bo karibin fikrên batil ê xwe belav bikin şaşîyekê bi deh rastîyan ambalaj dikin û wilo teqdîm dikin. Bi saya vê tektîkê bi eqîdeya mirovên ku agahîyên Îslamî yên wan zaîf bin, yan jî ew ji kûrahîya teqwayê mehrûm bin, dileyîzin.

Hindikbûn û cuz'î-bûna van fikrên batil, çi ew ji mûsteşriqan werin, çi jî ew ji baskê felsefê werin, hîç mazûr dîtina wan temîn nake. Lewra di bara hukmekî îlahî yê bi îtîqadê re elaqedar de sebeb-bûna van ji bo şubhê, yan jî tereddudê, ji bo însanî wek zirar bes e û gellek e jî.

Lewra îman tecezzîyê (dabeşbûnê) qebûl nake, yanî ew li ser cuz'an, perçeyan dabeş nabin; ew wek tev (yekperçekî) derbasdar e. Înkar-kirina temamê Qur'anê, yan jî înkarkirina hukmekî Qur'anê ji hêla aqîbeta ku wê mirovî bixiyê de ti ferqa wan ji hev nîn e. Herdu rewş jî mirovî ji îmanê dikin..

Bi sebeb vê tehlûkê, ji bilî wan alimên ehl, ên ku bi awayekî bidîrayet karibin heq û batil ji hev û din veqetînin, ji bo van ğem nake, wekî din îştîğala mislimanên din bi fikrên batil ve zirardar hatiye dîtin.

Li hemberî van, mislimanên mûnewwer û mûtefekkir ên ku kultura Qur'an û Sunnetê bi awayekî layiq hezm kiribin û bi qasî ku Îslamê li hemberî dijminên wê ji xwe re bikin doz, ji bo parastina xelkê ji îdlalê, îştîğalkirina wan bi vî îlmî li hemberî îddîa û fikrên batil ên ku ji baskê felsefê jî werin, ğerîb nayê dîtin.. Tam berevajî ev ji bo wan wacibek e. Heta ji bo mirov meydanê ji yekdestîya felsefeçîyên ateîst û materyalîst re nehêle, divê mirov di qada felsefê de jî alimên Îslamê yên xwedî peyv û otorîte perwerde bike, bigihîne.

Çawa **Hezretê Îmam Ğezalî** jî ji bo berevanîkirina ji bawerîya ehlê Sunnetê û di çarçoveya têkoşîna li dijî van zumreyên ku îmana sahîha xelkê şîlo dikin de ev îlm jî tedqîq kiriye. Heta Îmam Ğezalî, ji bo bibe asteng li dijî vê sûcdarkirina: “Însan çi nizanibe jê re dijmin e” ku dibe ji felsefeçîyan were, felsefe bi awayekî kûr hûrkolîn kiriye û ew ji bo hemû esasên felsefê hîn bûye. Ew wilo hînî felsefê bûye heta ku eserek bi navê “**Meqasîdû'l-Felasîfe**” li qelemê daye û di wê serdemê de piştî wî hemû meseleyên felsefî bi awayekî vekirî anîne zimên, berhemeke din jî bi navê “**Tehafutû'l-Felasîfe**” nivîsandiye û ev tenkîd û şermezar kirine. Bi taybetî jî wî 20 meselên ku di wan de di navbera fikra Arîsto û şopînerên wî û bawerîya Ehlê Sunnet û Cemaetê de ferq hene îzah kirine ku sê ji wan jî mûcibê kufrê ne.

Xusûseke din jî ku îştîğala bi felsefê mehzûrdar e, ew nexweşî ye ku ji heyranbûna korkorane ya ji bo Rojava tê; ew hewldana ji bo rûniştandina tefekkura Îslamê di zemîneke felsefî de ye. Bi qesdî, yan jî bi cahilane, bi hirsa teqlîdekê esas-girtina aqilî û sivik-kirina neqlê ye. Wate; avêtina wê ji bo plana paş e.

Haleveku Îslam, ne bi sîstemên beşerî, ne bi herk û tevgerên hevdem, ne jî bi dînekî ji bilî xwe îhtiyaca wê bi sentezekê heye. Îhtiyac dîtina bi vê sentezê, bi awayekî layiq nas-nekirina îhtîşama Îslamê ye. Lewra Îslam, li dinyayê yekane dînê heq e, û ew ji bo dinyayê xwedî dîtin-nêrîneke mûkemmel e. Ew, di serdem û civakên ku bi awayekî layiq hatiye tetbîqkirin de tim û daîm ji bo hizûr û aramîyê bûye serkehnî.

Ji her hêlê ve îddîa-kirina ku bilbilê esîl û bêqusûr, qijikeke bed-deng ji xwe re dike nimûne û dikare bi zarîkirina wê bike cihecih, bê hebûna qijikê ew nikare vê taybetmendî û sipehîtîya xwe biparêze, ev îddîa sade tinaza cehaleteke ehmeqane ye.

Rektorê Zanîngeha Îslamê li Rotterdemê **Prof. Dr. Ahmet Akgunduz** di nivîseke xwe ya bi navê "*Yeni Dünya Düzeni Arayışları ve İslam Medeniyeti = Lêgerînên Risteya Nû ya Dinyayî û Şehristanîya Îslamî*" de di bara vê rastîya ku îro Îslam tekane dîtin-nêrîna dinyayî ye ku karibe însanîyetê bigihîne aramîyê de, van tesbîtên balkêş dike:

*"Di serî de jî komunîzm û kapîtalîzm, nesla ne rewaya van jî hemû «îzm»an îflas kiriye, di roja me de bizzat teorîsyenên wan jî îflasa wan îlan dikin. Wek nîzama medenîyetê ya ku seadeta beşerîyetê temîn bike, ji Îslamîyetê pê ve ti alternatîfeke (cihgireke) jidil nîn e.*

*Mîsaleke mûşexxesa vê gotina me, ew qerar in ku papazan li Romayê di civîneke veşartî de girtine. Di vê civîna veşartî de, papazan bi xwe danpêdan (îtîraf) kiriye ku Îtalya ji hemû welatên Rojavayê Ewrûpayê bêhtir tesîra belaya komunîzmê lê bûye, ciwanîya ku ji komunîzê vedigere, vedigere lêbelê bawerîyê bi esasên filetîya mûherref nayîne, belkû jî ew li wî dînê fitrî yê beşerîyetê li dînê heq digere; li hemberî vê lêgerîna semîmî ji % 60 Îslamê dibînin..*

*Heke em misliman karibin Îslamîyeta rast û rastîya layiqê Îslamê bi jîyîna xwe û bi peyvên xwe bi awayekî sipehî vebêjin, bila di cih de em îfade bikin ku ev rêjeya hîdayetê wê hê bêhtir bilind bibe.*

*Ha Rojavayî ji vê ditirsin, bi aqilê xwe ji bo berê însanan ji ser Îslamê bidin rawestandin, hewl didin Îslamê şaş ji nifşên xwe re pêşkêş bikin.*

*Bila em di cih de dîyar bikin ku millet nikare bê dîn bijî, di serî de jî Rûsya û civakên filan, ewên ku bi ber bayê komunîzmê ketine û eqaîdeyên wan hejîyane, êdî ew nikarin vegerin bibin fileh jî. Cihê ku ewê werinê heke em wezîfa xwe bikin, Îslamîyet e."*

Me berê jî îfade kiribû; însanê Rojavayî bi sebeb şertên menfî yên ku ji sed salan ve li dijî Îslamê hatiye siwarkirin û tijekîn- kirin, ew di bin mij û moraneke girana tessub û raperestîyê de ye. Naxwe ji ber ku wan bi awayekî layiq ji nûra Îslamê îstîfade nekiriye, hewl didin bi çîka weza'ya mûmê rohnî bibin.

Madem cihê wê hatiye, bila em vê jî lê zêde bikin û bibêjin;

Li Rojava, ji bo berê mirovan ji ser Îslamê qut bikin bi sed salan e ku bi vê terzê; "**îslam dînê êlekê ye, misliman jî însanên wehşî û barbar in**" failîy-etên reşkirinê hatine kirin. Îro jî vê gotina wan cihê xwe ji vê kampanya'ya derew û îftîra; "**îslam dînê şerr û terorê ye**" re hiştiye.. Ew ji bo vê îddîaya xwe jî wan menzareyên dilşewat ên şerr, anarşî, xizanî û paşvemayînên ku dewletên misliman di pençeyên wan de difetilin û digevizin wek delîl şanî didin.

Haleveku di pêkhatina van menzareyan de, roleke mezina wan tuxmê fitneyên ku wan bi xwe çandine da ku planên mêhtingerî yên xwe bicih bikin heye. Lêbelê ew vê ji girseyên elêlat û qerebaliğ ên xelkê vedişêrin. Feqet ji ber ku ev heqîqet, di serdema gihandinê de wekî berê êdî nayên veşartin, her roja ku derbas dibe hijmara mirovên ku van rastîyan dibînin hê zêdetir dibe.

Însanê ku aqilê wî li serê wî be û ji wan şert û siwarkirinên menfî dûr bibe, ewê karibe bi nezara

însafê li mûhtewaya Îslamê binêre, hingê ew bibîne ku ji bo qebûlkirina wan îddîayên dibêjin Îslam dînê wehşet û terorê ye, ti îmkan û îhtîmal nîn e.. Lewra 23'ê heyata nebewî ya **Mezinê me Pêğember** ê ku wek rehm ji bo alemê hatiye şandin; di mahîyeta "**têkoşîna li dijî terorê**" de ye. Heyata wî ji hewldana berterefkirina hemû wehşetên ku li dijî însanî, heywan û tebîetê hatine kirin, îbaret e. Ew Pêğemberê Dawîn ê ku wesîla îftîxara kaînatê ye, wî ji bo hemû însanîyetê heq, hiqûq û edalet tewzî (belav) kiriye.

Çawa ku fîlozof **Lafayet** ê ku yek ji amadekarê bingehên fikrî yên îhtîlaka Fransizan a 1789'an e, berî "beyannameya mafên mirovan" a meşhûr were belavkirin, wî hûrkolîn li ser hemû sîstemên hiqûqî kiriye, dema wî çêtirbûna hiqûqê Îslamê dît, hew karîbû xwe ji gotina:

"*Ey Mûhemmed! Di xusûsa bicihkirina edaletê de ew sewîya ku tu gihayîyê, careke din ti kes negihayê!...*" bigre.

Bi rastî ew serdema cahîyetê ku têde taveroja însanîyet û fezîletê çûbû ava û reştarîya bêdînîtî û bêexlaqîtîyê xwe li dinyayê tevî pêçabû, bi teşrîfa wî, însanîyet gihaye fecra heqîqet û seadetê.

Çolên bedewîtîyê ku hê bi sağî keçikên xwe binax dikirin, qebîleyên bira hev û din serjê dikirin û ew bûbû gola xwînê, bi teblîğ û îrşada wî Pêğemberê rehmê bûne bexçeyên medenîyeteke bi nûr û ronak.

Ew teqan û avzêmên zulmê yên ku ji dijminahî, pevçûn û dozên xwînê tije bûne, hatine ziwakirin, êdî ew ketine keş û hewaya hizûr û mehebbeta biratîya dînî. **Medenîyeteke bêhemtaya fezîletan** hate damezirandin ku hê jî însanîyet bi ğibte lê seyr dike.

Ha Îslam, nûra hîdayeteke wilo ye ku wan civakên bi awayekî layiqê wê dibin peyrewên wê di hemû zeman û mekanan de wan di însanîyet, fezîlet û medenîyetê de ji bo zirwê bilind dike. Di dest însanîyetê de ji Îslamê ku wê heyata dinyayê bi cenneta hizûrê wergerandiye, nîzameke mûkemmeltira heyatê, wekî ku heta vêga mewcûd nebûye, ewê ji vêga û bi şûn de jî mewcûd nebe..

Naxwe îro li dinyayê tekane dînê heq Îslam e. Wek misliman ji bo me tevan wezîfa pêşîn e ku em bi awayekî layiq îhtîşama wê îdrak bikin, em bi awayekî asê xwe pê bigrin û em bi hal û hereketên xwe wê sipehî temsîl bikin.

Di demeke ku însanîyetê, ne di dînên mûherref û beşerî de, ne jî di felsefeyên mehsûlê êqil de tişta ku lê digere, nedîtiye û ber bi buhrana rûhî û tetmînnebûnê ve tê kişkişandin de, bi qasî sergêjîya ku hinek mensûbên dînê heq Îslamê radibin ji bo van rêyên batil hest bi hewes û heyranbûnê dikin sergêjîyeke dehşetdartir nabe..

Ez li vir dixwazim bîranîneke xwe veguhêzim:

Berî çendîn salan, fîlozof û sîyasetmedarê meşhûr, şefê buroya partîya komunîsta Fransizî **Prof. Roger Garaudy** piştî îslam tedqîq kiribû, misliman bûbû û hatibû Îstanbulê. Li Seraya Yildizê konferansek dida. Ez jî di wê konferansê de beşdar bûbûm. Garaudy ji guhdaran re axaftin kiribû û wiha gotibû:

"*-Hûn wek dîn, wek fikr sağlem in. Rojava jî ji her cîhetî ve nexweş e. Lêbelê çi ğerîb e ku hûn nexweşî teqlîd dikin, xebera we ji sağlemîya we nîn e!...*"

Di roja me de, divîyabû di **Fakulteyên Îlahîyetê** de tehsîla bilinda îslamî bihata dayîn, îcab dikir ku cîhetê nêrîna îslamî û dîtin-nêrîna wê ji bo dinyayê û herk û tevgerên felsefî û fikrî bihatana tehlîl û analîz-kirin. Lêbelê tam berevajî vê, ji terefê hinek mirovan ve ew ketine vê rewşa ku bi berçavka hinek tevgerên felsefî û fikrî Îslamê tenkîd dikin. Ev jî tezahureke dîtira heman zêhnîyeta çelexwehrî ye.

Ji bilî vê gellek telebe di derecekeke kafî de berî ji bo jêrxaneke dînî bibe xwedî, yanî berî di sewîyeke kafî de kultureke Qur'an û Sunnetê wergire, berê wî dana li ser hînbûna fikrên batil jî rewşeke ew qeder tehlûkedar e ku dikare aqilê taze yê wan îdlal bike, yanî lingê wan bişemitîne.. Lewra her telebê Îlahîyatê, ne **Îmam Ğezalî** ye ku dîtin-nêrînên batil tehlîl bike, xwe bi wan negire; lêbelê ew bibîne ku ew dîtin-nêrîn çi qeder di nav zaîftîyeke mezin de ne û karibe îmana xwe hê xurttir bike.

Çawa -ji derveyî îstisnayan- pirr zor e mirov mislimanekî şanî bide ku ji bo felsefe xwendibe bûbe xwedî teqwa, yan jî bêhtir dîndar bûbe. Feqet mûmkin e mirov li gellek mislimanan rast were ku bêyî îlmê kafî û îrfana wî hebe felsefe xwendibe û ji dîn sar bûbe.

Bi vê sebebê felsefe, -heke ewê here were xwendin- pêşî bila di dereceyeke kafî de kultura Qur'an û Sunnetê bi xwendekaran were qezenckirin, piştre bila sade ne zêdekên felsefê lêbelê; kêmekên wê jî werin nirxandin û werin hînkirin. Dema fikrên felsefî werin vegotin jî, bila îslam di bara wan fikran de bi çi awayî bersiv dabe, bila ew wilo bi delîlên îlmî yên tetmînkar were îzahkirin. Yanî ew fikrên ku bi heqîqetên îslamî re tezadê teşkîl dikin, bi taybetî jî bila tezên felsefî yên ateîst û materyalîst digel antîtezên wan werin vegotin. Divê were îzahkirin ku bi vî awayî Îslam, ji bo problemên felsefî yên însanan jî tekane dîtin-nêrîna ji bo dinyayê ye ku karibe cewabên tetmînkar bide.

Di tarîxa Îslamê de ew tîpa însanê ku hatibû xwestin ew di medreseyên **Nîzamîye**, **Îznîk** û **Fatîh**ê de were gihandin û perwerdekirin, ew kesên "alim" bûn, xwedî îlmekî têr bûn ku di dereceyeke fereh de karîbûn di her qadê de ji bo civakê rêbertîyê bikin. Wate, alimekî Îslamê, piştî di îlmên îslamî yên wekî tefsîr, hedîs, aqaîd, fiqh û tesewwufê de kûr bû, bi qasî

dereca îmkan û îstîdada xwe karîbû hiqûqê jî, tibê jî û felsefê jî hîn bibe...

Di roja me de jî tê zanîn ku ji hedefa di vê sewîyê de tehsîla îlmekî hatiye dûrketin û bes di branşeke dîyar de kûr-bûn hatiye ecibandin. Ji vê jî zêdetir îro di hinek Fakulteyên Îlahîyatê de heta berî kultura Qur'an û Sunnetê bi qasî pêwîst bi wan were qezenckirin ew têne mezûnkirin. Yanî tê dîtin ku di sewîyekeke îdeal de tehsîleke îslamî nayê dayîn.

Mesela dersa **Sîyer**ê ji bo Qur'an û Sunnetê wekî tefsîreke zindî ye, lêbelê ji we ve malûm e ka ew çi qeder di mûfredata Îlahîyatê de cihekî hindik digre. Ji vê jî zêdetir ew bi pirranî ji menzûmeya agahîyên kronolojîk bi wêdetir derbas nabe.

Haleveku Sîyera Nebî, derseke ew qeder lazim e ku divê mirov digel exlaqê Mezinê me Pêğember sîreta wî jî bixwîne, bi keyfîyeteke wisan wê tehlîl bike û wê hîn bibe ku karibe têde kûr bibe.

Lewra Cenabê Heq ji bo me di her reketê de li me ferman kiriye ku em xwe bavêjin ber penaha wî:

"**Me ji bo sirata mûsteqîm hîdayet bike!** (Ji bo me, rêya rasttirîn şanî bide.)"[52] Ji sirata mûsteqîm meqseda xwe wiha îzah dike, ji mezinê me Pêğember re xîtab dike, dibêje:

52. Fatîhe, 1/6.

"(Tu) **li ser rêya mûsteqîm î**."[53] Naxwe her mûmînê ku dixwaze bigihe wê sirata mûsteqîma ku Cenabê Heq jê razî ye, mecbûr e Mezinê me Pêğember ji nêzîk ve nas bike û li pey rêç û şopa bi nûra wî here.

Yek ji serkehnîyên bingehîn ên mislimanan Qur'ana Pîroz e, ya din jî "**uswe'yê hesene**" heyata mezinê me Pêğember e.. Rebbê me yê mezin û bilind di Qur'ana Pîroz de fermanên xwe îcmalen/wek xulase daye zanîn, tefsîlat û tetbîqata van jî di heyata nimûneyî ya mezinê me Resûlûllah de raxistiye. Ji bo vê ye ku di ayeta pîroz de wiha gotiye:

"**Kî ji Pêğember re îtaet bike, wî ji Xuda re îtaet kiriye**..." [54]

Di ayeteke pîroza din de di bara Resûlê Dilovan de wiha dibêje:

"(Bêşiwar) **Tu li ser exlaqekî mezin î**." [55]

Naxwe ewên ku li exlaqê mûkemmeltirîn digerin, bila hewl bidin ji bo exlaqê nimûneyî yê Mezinê me Pêğember fehm bikin. Lewra hemû berhemên Îslamî yên ku ji berî 1400 salan ve kitêbxane ji wan tije bûne; yek ji wan Kitêb e, yanî Qur'ana Pîroz e, ya din jî însanîye, yanî heyata Mezinê me, **Hezretê**

53. Yasîn, 36/4.
54. Nîsa, 4/80
55. Qelem,68/4.

**Mûhemmed Mûstefa** wek mîsaleke zindî ji bo exlaqê Qur'anê îzah bike, qelem lê hatiye kişandin..

Dîsa di ayetên pîroz de wiha dibêje:

"(Resûlê min!) **Rûhû'l-Emîn** (Cebraîl) **Ew** (Qur'an) **bi zimanekî erebîya fesîh anîye li ser dilê te peya kiriye ji bo tu bibî ji** (îrşad û) **îqazkeran**." [56]

Naxwe mûmînekî ku bixwaze bi awayekî layiqê wê Qur'anê îdrak bike jî divê ew ji bo keş û hewaya dilî ya Mezinê me aşîna û çavnas bibe. Lewra heyata nebewî ya 23 salan ya Mezinê me Pêğember di mahîyeta tefsîra Qur'anê de ye. Sirr û hikmetên Qur'anê jî bes bi par wergirtina ji tevna qelbî ya Mezinê me Resûlûllah tê fehmkirin.

Li ser vî esasî fehmkirina wî, di evdînîya ji bo Heq de giringtirîn pêpeling e.. Heta em wî fehm nekin, heta em wî nas nekin, heta em li pey rêç û şopa wî neçin, heta em para xwe ji hessasîyetên dilî yên wî negirin, ne îmana me dibe îmaneke tam, ne em karin Qur'anê tam îdrak bikin, ne jî evdînîya me dibe evdînîyeke tam...

Heta heyata Mezinê me Pêğember bi awayekî layiq neyê zanîn, hîç yek ji îlm û zanistên Îslamî; ne tefsîr, ne hedîs, ne fiqh, ne jî exlaq bi awayekî

56. Şûera, 26/193-195.

layiq nayê fehmkirin. Ji vî cîhetî ve ji bo mirov karibe bi awayekî rast Îslamê fehm bike “Sîyera Nebî” di serê giringtirînê wan dersan de tê ku divê mirov giranîya xwe bide ser wê.

Ji bilî vê jî Cenabê Heq di Qur’ana Pîroza xwe de zehf zêde wesfê fariq ê pêğemberên xwe wek mîsal dide. Çareserîyên ku pêğemberan ji bo wan problemên ku di civakê de lê rast dihatin anîne, ji me re dide zanîn. Bi vê yekê ji me dixwaze ku em van bi awayekî layiq tehlîl û tefekkur bikin û wan ji xwe re bikin nimûne. Ji vî cîhetî ve di roja me de di Fakulteyên Îlahîyatê de li tenişta dersa “**tarîxa dînan**” dersek di bara “**Silsîleya Pêğemberan**” de jî zerûrî ye.

Xwendekarê Îlahîyatê, divê pêşî ew bi van malûmatên bingehîn were mûcehhez kirin da ku karibe piştre ji îlmên di qadên din de jî hewl bide bi qasî îmkan û îstîdada xwe îstîfade bike.

Ji bo vê ew mirovên ku îlmên Îslamî tehsîl dikin, divê pêşî ew bingehên îmana xwe di ufûqên tefekkurê yên ku Qur’an û Sunnetê vekirine de xurt bikin. Heke ew ji tefekkura Qur’anê dûr bimînin û îman di dereceyeke kafî de di qelbê wan de koka xwe kûr bernede, ewê lawaz bibe û bi bagerekê belav bibe û here. Însanên ku îro li wan fikrên batil, ên ku bi prensîpên aqil û mentiqê hatine xemilandin, rast tên, yek ji mûhîmtirîn

problemên ku lingên wan dişemitîne jî ev e (îman zaîfî ye).

**Cenabê Heq, ji bo me tevan, bike nesîb û ji me re mûyesser bike ku em bi awayekî babet qedr û qîmetê Qur'an û Sunnetê îdrak bikin. Em karibin aqilê xwe û qelbê xwe di tefekkura van herdu serkehnîyan de kûr berdin û em karibin para xwe ji hikmetên îlahî wergirin.**

**Ew, keş û hewayeke dilekî şîyar û reqîq ê wisan ji bo me tevan îhsan bike ku ew ji tecel-lîyatên qudret û ezameta îlahî ya ku di Qur'an, kaînat û însan de hatine raxistin dilerize.**

**Ew wî aqilê selîm û qelbê selîm ji me re lutf bike ku em karibin bi wan para xwe ji fermana celîla wî "Bixwîne! Bi navê Rebbê xwe yê ku aferandiye" [57] wergirin ku bibe wesîle ji bo her esera ku dibîne, pê bigihe mûessirî û ji hunerî jî pê bigihîje hunermendî.**

**Amîn!...**

57. Eleq, 96/1.

# Ferheng

## - A a -

**Aferîner**: Aferîndox, xaliq, pêkîner, çêker, peydaker, îcadker.

**Aferînde**: Mexlûq, ewê ku hatiye xuliqandin.

**Al**: Ehl, aîle, ewlad, nesl, kinês, zurrîyyet.

**Alemşimûl**: Cîhanşimûl, alem-tevî, ewa ku dinyayê tevî dide ber xwe.

**Ateîst**: Ewê ku Xuda înkar dike, bêdîn, kafir.

**Alternatîf**: Cihgir, şûngir, bedîl.

## - B b -

**Bel hum edall**: Belkû ew ji heywanan jî rêşaştir in.

**Bevken**: Tebessum, kenê bê dev vekirin e.

**Besîret**: 1. Dîtina bi dilî, dîtina rast û biendaz, jîrîtî, şûmbûn. 2. His, dîtina dûr, dûrebînî. 3. Firsend, fehmkirin, kûrbînî. Pêşebînî, dîtina bi qelb e. Dîtina bi qelbî, dîtina rast û bi endaz, dûrbîn, feraset, fehmkirin.

**Bextewarî**: Dilşadî, aramî, hizûra dil û wijdanî ye. Bextewarî, şadmanî, dilcoş, keyfxweşî û seadet e.

**Beyhûde**: Bê feyde, bê mûfa, li ber çav nayê girtin.

**Bêzar**: Reht, gazindker, nerehet, nememnûn.

**Bilcumle**: Bi tevahî, bi giştî, bi temamî.

**Burhan**: Delîl, pêbawerî.

## - C c -

**Celadet**: Agîdî, qehremanî, lehengî, nebezî, mêrxasî, çavnetirs.

**Cihûtî**: Yehûdîtî, Mûsewîtî.

**Cîdal**: 1. Pevçûn, mûcadele. 2. Mûnaqeşe, axaftina agirîn.

**Cuzî**: Hindik, piçek, kêm.

## - D d -

**Dalalet**: Jirêderketin, rêşaşî, ji hîdayetê ketin, ji rêya rast ketin, rêya xwehr, serxweveçûn, meyla batilî, heqnenasî.

**Desttêwerdan**: Mûdaxele, destê xwe xistin navê, telîya xwe xistin navê.

**Derfet**: Îmkan, wasîte, navgîn.

**Dîktator**: 1. Mûstebid, zordar, serdest, zulmkar. 2. Ew zilamê dewletê ye ku qanûnên mewcûd binpê dike, li derveyî bingehên urf û adetan dewletê li gorî keyfa xwe birêve dibe.

**Dîrayet**: 1. Zekawet, agahî, têgihiştin, tijefehmî. 2. Baladestbûn, dest-bilindbûn, mûqtedirbûn.

**Dûçar bûn**: Mûbtela bûn, bela-lêketî, pêvedayî, hatî-girtî, pêgirtî.

## - E e -

**Ehkam**: Geljimareya **hukm** e. Hukman, darazan. Yanî hukm û ferman.

**Ehwal**: Geljimareya **hal** e, rewş, wezîyet, dana Xuda, halên manewî.

**Ekol**: Rêgeh, xwendegeha fikrî, mekteb.

**Ellame**: Raweya mûbaleğa alimî ye. Wate, ewê ku zehf alim e.

**Elzem**: Lazimtir, pêwîsttir, gerektir, bivê-nevê, jêneger.

**Amelî**: 1. Bi emel, kar û kirinan re elaqedar. 2. Ewê ku xwe li ber kar digre, tetbîqî, ne teorî, ne nezerî.

**Entuvîzyon**: His, seh, pêhisî.

**Eqlê meaşê**: 1. Aqilê ku li dinyayê karê debarê tenê difikre. 2. Aqilê tebeqa jêrtirîn.

**Eqlê meadê**: 1. Ew aqilê ku axretê dihizire. 2. Ew aqilê ku bi îlm û îrfanê hatiye terbîyekirin. 3. Ew aqilê ku dahatûyê fehm dike.

**Enanîyet**: Ezîtî, ezperestî, egoîstî, xwedbînî.

**Esrê seadetê**: Ew serdema ku pêğemberê me Hezretê Mûhemmed wek pêğember li dinyayê bûye.

**Esef**: Berketin, dilkulî, kovanî, ğemgîn bûn.

**Eşrefê mexlûqat**: Yê ji hemû mexlûqatan bi şereftir.

**Etfa nezer**: Çav lê kirin, nêrîn, meyzandin.

**Ezmûn**: Bi tecrûbe, biserhatî, mûcerreb, tecrûbekirî.

## - F f -

**Fariq**: Cudaker, veqetîner, cihêkar.

**Fer'î**: 1. Ya ne eslî, qismî, di dereca duduyan de. 2. Tefsîlat, kitekiteyî. 3. Ta, şağ.

**Feraset**: Jîrîtîya zêhnî, qabilîyeta zû fehmkirina tiştekî, ji rûyê wî fehmkirina amadekarî û exlaqê kesekî, hesta çêbûna tiştekî berî hatina wî ye.

**Fexrê Kaînatê**: Şehnazîya cîhanê, îftîxara kaînatê, bînahîya çavan Hezretê Resûlê Ekrem, serkehnîya şehnazîya hebûnê, Hezretê Pêğember.

**Feyz sitandin**: Îstîfadekirina ji hêla manewî ve.

**Fitrî**: Aferandinî, xulqîyetî, tebîî, ji zikmakî.

**Fişar**: Zext, serkutî, xurtî.

**Fîlozof**: Felsefeçî, feylesof, ewê ku bi felsefê re mijûl dibe. Ew fenzanê ku bi îlmê hikmetê ve meşğûl dibe.

## - G g -

**Geşbîn**: Bi umîd-bûn, bi hêvî-bûn, ji bo paşerojê bi hêvî-bûn, geş dîtin, îyîmserlîk.

**Giring**: Mûhîm, ehemmîyet, pere-pêdan.

**Global**: Cîhanî, alemî, gerdûnî, dinyayî, bi dinyayê re elaqedar, ya hemû dinyayê.

**Gurûh**:1. Qerebaliğ, civak, cemaet. 2. Beşek. 3. Qerebaliğa

pûç, civaka nehezkirî, kerî.

- Ğ ğ -

**Ğeraîb**: Geljimareya ğerîb e. Bîyanî, nenas, nejime, nejimalê, nedost, ne yar.

**Ğerîb**: Bîyanî, bêgane, nenas, ne aşîna.

- H h -

**Heds**: his, hest, entuvîzyon.

**Hemaqet**: Ğelaya fehmkirinê, fehmkorî, tênegihayî, berneketî, nefehm.

**Heml kirin**: Îsnad kirin, lê-anîn, lê barkirin, sebeb şanîdan, westandin, xistin stû.

**Hewa**: 1. Ew arzû, hewes û pê xweşbûna ku bi tiştên nefsê re elaqedar e. 2. Zewqên nefsanî û dil-pêve-mayî.

**Helwest**: Tewr, mewqif, sekin.

**Hezarat**: Geljimareya hezret e. Yanî Hazir, îhtîram, sîyanet, rêzdarî ye. Ev peyv di axaftinê de di pêşîya navan de ji bo hurmetê tê bikaranîn. Ji bo mêran Hezretê, ji bo jinan jî Hezreta. Kurtenivîsa wê jî **Hz**. e.

**Huner**: Sen‘at. Pîşe. Marîfet. Zanatî. Hostatî, meharet. Pêhlewanî.

- İ i -

**Îctîhad**: Ew destûr û hukm e ku di fiqhê de xwedî peyv û alimên mezin ji Qur’an û sunnetê fehm dikin, ji wan derdixin û tînin li ber xelkê datînin.

**Îdlal**: Xistina dalaletê, ji rêya rast derxistin, har kirin, çewt kirin, fehş kirin.

**Îhate**: 1. Dorgirtina li tiştekî, dor lê pêçan. 2. Fehmkirina bi zêhn, eql û zanînê; bi awayekî mûkemmel fehmkirin.

**Îkmal kirin**: Bi kemalê gihandin, temamkirin, xilas kirin, tekûzkirin.

**Îkon**: Di dêra Ortodoksî de teswîra olî, ayînî ye.

**Îktîfa**: Kafî-dîtin, têrêkirin, qenaet pê kirin.

**Îlhad**: 1. Ji bawerîya rast ketin, ji îmanê zîvirîn. 2. Xirabîya bawerîyê, bêdînî.

**Îllet**: 1. Nexweşî, nesağî, xestetî. 2. Sebeb, sedem.

**Împerator**: Şahê mezin, hukmdarê mezin, padîşahê ku dikare hukmê xwe li ser çend welatan bide derbaskirin.

**Îns û cin**: Însanan û cinan.

**Înzal**: Peyabûn, anîna xwarê, nazil bûn.

**Îrrasyonel**: 1. Ne maqûl, ne eqlber. 2. Ew dîtina ku di dereca yekê de malûmat wergirtin ne ji eql be.

**Îrşad**: 1. Rêya Heq, rêya rast nîşandan, îqazkirin. 2. Di tesewwufê de ew e ku mûrşid rêya Xuda şanî mirîdên xwe bide. Şanî-dana rêya heq, rêya rast û durust, şiyar-kirin.

**Îstifham**: 1. Pirsa ku zêhn mijûl dike. 2.

Bi awayê pirs pirsînê fehm kirin.

**Îstiğraq**: 1. Noq-bûn, di navê de hatin veşartin. 2. Ji xwe çûn û dinya jibîrkirin. 3. Xeniqîn û noqav bûn.

**Îstînad**: 1. Xwe li ber girtin. 2. Pê bawer bûn. 3. Palpişt, delîl.

**Îştîğal**: Mijûl bûn, kar kirin, hewldan.

**Îştîğala bi ebesê**: Mijûlbûna bi tiştên ne hewce, kelevajî û pûç re.

**Îtîbarî**: Digel ku di rastî û fiîlîyatê de ne wilo ye jî lê dîsa tê jimartin her wekî ku wilo ye.

**Îtîqad**: 1. Pêbendbûna bi fikrekê, bi bawerîyekê, îman pê anîn. 2. Bihayên bawerîya esasî. 3. Pêbendbûna qelbî ya bi Xuda, bawerîyeke qet'î.

**Îz'an**: 1. Têgihiştin, fehmkirin, eql. 2. Îtaet, guhdarî-kirina li xeberdanê, stûxwehrkirin. 3. Terbîye, edeb. Lê guhdarîkirin, teslîm-bûn, terbîye, edeb.

**Îzafî**: Ewa ku dikare bi pêbendbûnja bi tiştekî ve biguhere, guhêrber.

## - K k -

**Kapîtalîst**: Sermayedar.

**Kemmîyet**: Çendanî, hijmar, miqdar.

**Keyfîyet**: 1. Ew qelîte, hal û rewşa ku tiştek li serê çawa çêbûye. 2. Kar û hadîse.

**Krîstîyanî**: Filehtî, Îsewîtî, nesranîyet, mesîhîyet.

**Kîfayet**: Kafî-bûn, têrêkirin, ne nuqsan, nezêde.

**Kronolojî**: Ew zanist e ku bi cih û zeman hûrkolînê li ser bûyerên tarîxî dike.

**Konsil**: Encûmena rûhanî û rahiban.

**Kullîyat**: Geljimareya **kullîyet** e. 1. Temamîya tiştekî ye. 2. Temamê eserên nivîserekî ne. 3. Hemû berhemên di mijarekê de ne.

**Kunh**: Hemû esasên tiştekî.

## - L l -

**Lehwîyet**: Leystik û keyfbûrandin, tiştên bêfeyde.

## - M m -

**Malûl**: Bi îllet, êşdar, jandar, nexweş, xeste.

**Maqûlat**: Geljimareya **maqûlet**ê ye. 1. Ew tişta eqlber e, bi eql re guncaw e. mentiqdar. 2. Tiştên ku bi rêya eql tên fehmkirin, bi mûhakema eql tên bidestxistin.

**Maqûlîyet**: Rewşa tiştê ku ji eql nêzîk e, maqûltî ye.

**Marez**: Nexweşî, êş, bela û rewşa zor.

**Marîfetûllah**: Ji kûrahîya dilê xwe û bi yeqînî zanîn û naskirina Xuda.

**Masîwa**: 1. Hemû heyberên ji bilî Xuda, ji ğeyrî Xuda. 2. Tiştên bi dinyayê re têkildar.

**Materyalîst**: Ewê ku materyalîzmê dipejirîne, maddîyatê diperêse, bûjenperest.

**Mecnûn**: 1. Har û dîn, dîwane. 2. Eql ne

temam. 3. Evîndarê dînane.

**Medar**: 1. Sebeb. 2. Wesîle, wasîte.

**Medar bûn**: Feyda wî lê bûn.

**Menfî**: 1. Neyênî, ne erênî, nelê. 2. negatîf, ne mûsbet.

**Menfîetdar**: Bi havil, bi feyde, bi kar û qezenc.

**Menzûme**: Sîstem, riste, tertîb.

**Mercek**: Rojik, adese, mercek.

**Meşrûîyet**: Rewşa meşrûbûnê; bi hiqûqê re guncawbûn, rewabûn.

**Metafizîk**: Ji fizîkê bi wêdetir, ew tişta ku bi hissan nayê îdrak-kirin.

**Mewcûdat**: Heyberan, mexlûqatan, hemû tiştên ku hatine pêkanîn.

**Mezalim**: Zulm û neheqîyan.

**Mezc-kirin**: Tevlî-kirin.

**Mezher**: 1. Cihê ku tiştek lê zahir û xuya dibe. 2. Gihayî, naîlbûyî.

**Mezîyet**: Xusûsîyeta ku tiştekî ji tiştên din vediqetîne, wî ji wan çêtir dike û xusûsîyetê jê re bexş dike.

**Mîstîk**: 1. Ew tiştê ku alîyê wî yê nehanî heye, bisirr. 2. Ew tiştê bi Mîstîzmê re elaqedar, sirrî, tesewwifî. 3. Mûtesewwif û ew kesê ku xwe ji heyata dinyayê dûr kiriye û xwe weqf kiriye ji bo qezenckirina rizamendîya Xuda.

**Mîzan kirin**: Pîvan, kişandin.

**Monîst**: Terefdarê monîzmê, yekparêz, tekperest.

**Mûareze**: pevçûn, kêşmekêşî, şerrê bi peyvê.

**Mûcahede**: 1. Mûcadele, hewldan, ğeyret. 2. Kirina tişta ku nefsa mirov naxwaze bi vî awayî ji bo gihana hestên manewî terbîyekirina nefsê ye.

**Mûcazat**: 1. Cezayê ku li hemberî sûc û qebahetekê tê dayîn. 2. Hemberî.

**Mûcehhez**: Hatiye xemilandin, kêmasî jê hatine birin, amade ye, hazir e, likar e.

**Mûcerred**: 1. Xwerû, tişta ku ne cism e. 2. Saf û xalis e. 3. Hatiye tecrîdkirin, hatiye tazîkirin.

**Mûcib**: Ewê ku îcab dike, lazim dike, gerek dike.

**Mûctehid**: Alimê ku hukm ji ayet û hedîsan derdixin.

**Mûessir**: 1. Ewê ku tesîr dike, şopê dihêle. 2. Ewê ku kederan dide. 3. Ewê ku peyva wî derbas dibe, hukmê wî dimeşe.

**Mûfekkîre**: Hêza fikirînê.

**Mûfredat**: Tefsîlat û kitekitehîya tiştên aîda maddeyekê, yan jî, mijarekê.

**Mûhakeme**: 1. Ew rûniştina dadgehkirinê ya li hizûra dadger e. 2. Hizrkirin, fehmkirin.

**Mûherref**: Hatiye tehrîfkirin, ji eslê wê hatiye dûrkirin, hatiye guherandin.

**Mûhtewa**: Naverok, fehrest.

**Mûnewwer**: 1. Bi ronahî, rewşenbîr. 2. Hatiye rohnîkirin. 3. Zana, kulturmend.

**Mûnezzeh**: 1. Bê îhtiyac, yê ku îhtiyaca wî bi ti kes û ti tiştî nîn e. 2. Hatiye paqijkirin, temîz, salim, dûr.

**Mûnhesir**: 1. Hatiye hesrkirin, hatiye veqetandin, tişta ku ji bo tiştekî yan jî kesekî hatiye texsîskirin. 2. Hatiye dorpêçkirin. 3. Sînordar.

**Mûqedder**: Nivîsa enîyê, ew teqdîra ku ji terefê Xuda ve ji ezelî de hatiye dîyarkirin.

**Mûqeyyed**: 1. Bi qeyd û bend, girêdayî. 2. Ewê ku xwe bi xwe heyber nabe, ewê ku hebûna wî bi hebûna yekî din ve hewcedar e.

**Mûsademe**: Li hev ketin, li hev xistin.

**Mûsteqîm**: 1. Rêya rast û durust. 2. Rast, ne berwar. 32. Bi exlaq, bi îffet.

**Mûsteşriq**: Şerqîyatçî, rojhilatnas, oryantalîst; ew kesê ku bi dîn, ziman, kultur û tarîxa milletên rojhilatî re mijûl dibe.

**Mûşahede**: 1. Dîtina tiştekî bi çavan e. 2. Seyira menewî.

**Mûşerref**: Şerefmend, ewê ku şeref jê re hatiye dayîn.

**Mûşexxes**: Tişta ku hatiye bişexskirin, bicismkirin, bişeklkirin. 2. Tişta ku bi çavan tê dîtin û bi destan tê destlêxistin.

**Mûşkil**: 1. Zor, dijwar. 2. Zehmetî, asteng.

**Mûtabiq**: Ewê ku ji hev re biaheng in, lihev tên.

**Mûtad**: Bi adet bûye, hatiye hînbûn, her wextî.

**Mûteessibane**: Bi raperestane, bi korkorane.

**Mûtefekkir**: Ewê ku tefekkur dike, hizrmend, fikrmend, ramandar.

**Mûtleq**: 1. Ewê ku bi ti qeydekî ve ne pend e, bi tiştekî ve negirêdayî ye. 2. Ewê ku hebûna wî bi hebûna tiştekî din ve ne hewce ye. Ewê ku hebûna wî bi wî bi xwe ye. 3. Heybera mûkemmel.

**Mûttesif**: Ewê ku hatiye wesfkirin, biwesf e, sifetmend e.

**Mûwafiq**: Guncaw, mûnasib, di cihê xwe de.

**Mûwazene**: 1. Wekhevbûna halê du tiştan, hevkêş bûn. 2. Mûqayese. 3. Raman, tedbîr.

**Mûxtar**: Bijardî, neqandî, guzîde.

**Mûzir**: Zirarmend, zîyandar, ewê ku zirar dide, bêkêr.

## - N n -

**Naqis**: Nuqsan, kêm, netemam.

**Nebatat**: Geljimareya nebatê ye, ew jî giya ye.

**Ness**: 1. Hukmê eşkere, delîla qet‘î. 2. Ew ayet û hedîsa ku hukmê qet‘î anîye.

**Nezerîye**: Dîtin, nêrîn, teorî.

**Nibiwwet**: Pêğembertî, resûltî, qasidtî.

**Nimûneya îmtîsalê**: Nimûneya ku mirov ji xwe re dike mîsal û mirov li pey wê diçe.

**Nîrvana**: Rewşa bextewarbûnê ye. Ew di ola Bûdîzmê de hedefa nîhaî ye, ew ji bo îfadekirina xilasîyê bikartê. Ev peyva nîrvana, ji bo vemirîna agir tê îstîmalkirin. Ew bi maneya "vemirîn, sakinbûn"ê tê. Ew rewşa ji holê rabûna cehaletê ye. Nîrvana rewşa dawîn e ku Bûdîst dixwazin bigihinê.

## - P p -

**Pêğemberên 'îzam**: Pêğemberên mezin.

**Pêvajo**: Qunağ, merhele, sefhe, qedeme.

**Peyapey**: Qism bi qism, li pey hev.

**Pût**: 1. Senem. 2. Hezkirî, mehbûb.

**Pûsûla**: Qiblename, cîhetnuma, alîşaner.

## - Q q -

**Qabil**: 1. Cins, nesl, cure, çînî, sinif. 2. Wekî.

**Qedîm**: Bi zemanên zehf kevin re elaqedar, tarîxî, mêj, kevnar, dêrîn.

## - R r -

**Ram bûn**: Mûtî bûn, teslîm bûn, desteber bûn, ketina bin fermana yekî din, têkçûn, têkşikestin, bezîn, binketina xwe qebûlkirin.

**Raman**: Hizr, fikr, endîşe.

**Reaksîyon**: Bertek, berepê.

**Realîte**: Heqîqet, rasteqîne.

**Rektor**: Ragir, birêvebirê zanîngehê.

**Reşbînî**: Bêhêvît, bêumîdî, ji paşerojê ti hêvîyek nebûn, karamsarlik.

**Riyazat**: Geljimareya **Rîyazetê** ye. Ew jî ev e; mirov hindik bixwe, hindik raze, tim îbadetê bike. Bi vî awayî, nefsa xwe terbîye û perwerde bike, bi xwe karibe, xwe li hemberî heramîyê bigre, destê xwe ji zewq û sefaya dinyayê bikişîne û nefsa xwe bişikîne.

## - S s -

**Sadir bûn**: Derketin, hatina meydanê, xuya bûn, zahir bûn.

**Salim**: 1. Ne nexweş, ne seqet û şilûşeht. 2. Bêeyb, bêqusûr. 3. Bêtirs, bêendîşe, emîn.

**Se'y û ğeyret**: Xebat kirin, hewldan, cehd kirin.

**Sedeqa carîye**: Ew xêr û hesenat e ku her tim dibe wesîleya ecr û sewabê. Her wekî mizgeft, mekteb, medrese, çeşme, kehnî, bîr, çal, pir, nexweşxane û yên wekî van e.

**Sefahat**: 1. Zêde zêde heyrantîya ji bo keyf û zewqa dinyayî. 2. Îsrafkirina mal. 3. Zewqperestî, keyfperestî.

**Sefhe**: Pêvajo, qunağ, merhele, werçerx.

**Sehîh**: Rast, heqîqet, sağlem, derbasdar.

**Selahîyet**: Karbidestî, peywirdarî.

**Selîm**: 1. Semîmî, temîz. 2. Mûkemmel, tekûz, sağlem, rast. 2. Bê xeter, bê tehlûke, bê zirar.

**Sentez**: 1. Bi yek-kirin, yek-kirina regezên curecur, ji tiştên cuda cuda tiştekî nû anîna meydanê, terkîb. 2. Usûla ji kitekit-eyan çûna temamê. 3. Unsûra ku di sewîya bilind de ji pev kelîna tez û antîtezê tê meydanê.

**Sifetên sibûtî**: Sifetên ku bi hebûna Xuda re elaqedar in [heyat, îlm, semî, beser, îrade, qudret, kelam, tekwîn].

**Sifetên zatî**: Ew sifetên ku yên zatê Xuda ne, ew sifetên ku zid û dijê wan nayê bîrbirin û fikrkirin. [Wucûd, qidem, beqa, wehdanîyet, mûxalefetûn lîl-hewadîs, qiyam bi nefsihî]

**Sinûhat**: Tişta ku tê bîra mirov, diniqute dil, tişta ku di dil de çêdibe.

**Sîtil**: Ew beroşa mezina ku av têde tê germ-kirin.

**Subjektîf**: 1. Tişta aîdê failî, kirdeyî; ewa ku di şûna heqîqeta xwe de xwe dispêre fikr û hestên failî. 2. Kes-ayetî, şexsî, takekesî, ferdî.

**Sûlte**: Otorîte, desthilat, selahîyet.

### - Ş ş -

**Şablon**: Qalib.

**Şamil**: Tevgir, hemûgirtî, Tişta ku dixe nava

xwe, dide ber xwe, di xwe de dihewîne.

**Şemûs**: Har, nesernerm, nehir, nehelîm, nestûxwehr.

**Şimûl**: 1.Ewa ku dide ber xwe, dixe navbera xwe. 2. Aîdbûn, şanîdan.

**Şopîner**: Taqîbçî, peyrew, ewê ku di fikr û bawerîyekê de, yan jî di tiştekî din de li pey rêç û şopa yekî din diçe, wî ji xwe re lîder û pêşîvan qebûl dike.

## - T t -

**Tadîlat**: Sererastkirinan, guhertinan.

**Taybetmendî**: Xusûsîyet, mezîyet, qabilîyet.

**Te'lîf**: 1. Berhem nivîsandin, komkirin, rêzkirin. 2. Pev-xweşkirin, pev-dan-hezkirin, lihevanîn.

**Te'yîd**: 1. Xurtkirin, destek-kirin, sağlemkirin. 2. Rastdêrîn.

**Teblîğ:** 1. Gihandin. 2. Vegotina dîn ji dîgeran re bi vî awayî xebatkirin ji bo belavkirin û zêdekirina wî.

**Teblîğat**: Geljimareya **teblîğ** e, yanî tiştên ku hatine ragihandin.

**Techîz**: Temamkirina tiştên pêwîst, xemilandin, tekûzkirin.

**Teelluq**: 1. Elaqe, nisbet. 2. Mûnasebet, îrtîbat.

**Teessub**: Terefdarîya zêde, pêbendîya kor korane, israra di batil de.

**Tehrîf**: 1. Di peyvan de guherandina cihê

herfan bi hev, bi vî awayî maneya wan xirab-kirin. 2. Xirab kirin, guherandin.

**Tekamul**: Pêşhata ku gav bi gav tê meydanê. Guhertina ku gav bi gav pêktê, bi kemalê gihan.

**Tekrîm**: Îhtîram şanîdan, bilind-kirin, qedr-girtin, mezin kirin.

**Tekzîb**: Derewandin, şaş qebûl-kirin, nerast-zanîn, derew-derxis-tin, redkirin.

**Telqîn**: 1. Fikrê xwe dan qebûlkirin, dan hînki-rin. 2. Li ber serê yekî ku li ber mir-inê be dubarekirina kelîma şehadetê, bi vî awayî pê da gotin e.

**Temayul**: 1. Bi terefekî ve rast xweh-rbûn, meylkirin. 2. Terefdarbûna ji bo tiştekî yan kesekî ye, 3. Elaqe-şanîdan e.

**Tenaqud**: Nakokî. Ewê ku du peyvên wî ji hev re dij bin.

**Tenwîr**: 1. Rohnî kirin. 2. Agahdar kirin.

**Tenzîm**: 1. Bi rêxistin kirin, xistin nîzamê. 2. Sererastkirin, çak-sazkirin.

**Teorî**: Dîtin-nêrîn, nezerî, raman û hizr.

**Teorîsyen**: Ewê ku teorîyê li holê datîne, bavê fikrekî, bîrbir.

**Tereqqî**: 1. Zêdekirin, pêşveçûn, bilindbûn. 2. Hatina ji bo halekî baştir.

**Tesanud**: Palpiştî.

**Tesellut**: Mûsellit bûn, dev avêtin, li serê yekî bûne bela.

**Teselsul**: Peyapey hatin, hev taqîbkirin, zincîrbûn.

**Tesewwir**: 1. Di zêhnê xwe de zindîkirin, xeyalkirin, anîn ber çavan, fikirîna tişta ku mirov bike. 2. Fikirîna kirina tiştekî.

**Tesfîye**: Safîkirin, temîzkirin.

**Teswîr**: 1. Resmê yekî çêkirin. 2. Resm, fîgur, portre. 3. Bi nivîsê tarîfkirin. 4. Sûret-zindîkirin, anîn ber çavan, şeklê tiştekî anîn bîra xwe.

**Teşbîh**: Bi hev şibihandin, li hev qiyaskirin.

**Tewzî**: 1. Belavkirin. 2. Dana para her kesî ye.

**Texeyyul**: Di xeyalê de sûret pê bexşîn, anîn bîra xwe, di zêhn û mejîyê xwe de candarkirin.

**Texfîf**: 1. Sivik-kirin. 2. Biçûk dîtin.

**Tezad**: Nakok, hevnegirtî, bêaheng, lihevketî.

**Tezkîye**: Paqij-kirina nefsê ji her sifet û meylên xirab, temîzkirin, sipîkirin, bi exlaqê xweş xemilandin.

## - U u -

**Ulûhîyet**: Îlahtî, ribûbîyet, Xudatî.

**Umûmî**: Umûmîyet, giştî, tevahî, hemûyî, gelemperî.

**Utopya**: 1. Ew fikra ku tê hizrkirin lê hîç nayê cih, welatê xeyala îdeal. 2. Fikra ku bicih-hatina wê bê îmkan.

### - W w -

**Wacib**: Xudayê [heyberê] ku hebûna wî zerûrî ye, hebûna wî bi wî ye, nebûna wî nayê fikirîn.

**Wacîbat**: Geljimareya wacîbet e. Ew kar û deynê ku her divê were edakirin, bivênevê.

**Waqif**: Agahdar, xeberdar, haydar, malûmatmend.

**Wasil**: Gihayî, bi mirada xwe gihiştî.

**Wate**: Yanî.

**Wecd**: Evîn, mehebbet, heyecana bilind. Hezkirina mirov pê ji xwe diçe û pê dikeve heyecanê.

### - X x -

**Xatem**: 1. Dawî, dawîtirîn. 2. Mohr, demğe. 3. Gustîl.

**Xatîme kirin**: Bi dawî kirin, dawî-dan.

**Xelq kirin**: Aferandin, ji tineyî anîne wicûdê.

**Xesim**: Dijmin, neyar, nehez.

**Xetim-kirin**: Bi dawîkirin, xilas-kirin, paşî-lêanîn.

**Xulase**: Bi kurtî, wek xulase.

**Xusûmet**: Dijminahî, nedostî, neyartî, nehezî.

### - Z z -

**Zebûn**: 1. Zeîf. 2. Bêtaqet, bêhêz, bêmecal. 3. Bêçare, reben 4. Kedermend, dilbikul.

**Zem kirin**: Bi xirabî behs kirin, eybdar kirin.

**Zewat**: Geljimareya zat e. Yanî şexsan, kesan.

**Zimmet kirin**: 1. Hildan ser xwe. wezîfedan, berpirs-kirin. 2. Deyndar kirin. 3. Xistin bin hîmaye û parastinê.

# Naverok